JI BO KURMANCAN
BI AWAYÊ MUQAYESEYÎ

# GRAMERA KIRDKÎ
# (ZAZAKÎ)

Roşan Lezgîn



**Weşanxaneya Roşna**: 13
**Ziman**: 3

Roşan Lezgîn
Ji bo Kurmancan bi Awayê Muqayeseyî
Gramera Kirdkî (Zazakî)
Çapa yekem, Dîyarbekir, 2013

**Edîtor**: Roşan Lezgîn
**Mîzanpaj**: Weşanxaneya Roşna
**Xebata Bergê**: Şemal Medya

**Çapxane**: Berdan Matbaası
Davutpaşa Cad. Güven Sanai Sitesi C Blok No: 239
Topkapı / İstanbul
Tel: 0 212 613 12 11

**ISBN**: 978-605-4287-58-1



**Adres**: Lise 2. Sok. Adalet Ap. Kat: 1, No: 3
Yenişehir / Diyarbakır
**Tel**: 0 412 223 03 69
**E-mail**: rlezgin@hotmail.com

*“Ne ji bo piçukêd kurmancan / Belkû ji bo sahib rewacan”*

**Hezar rehme li gora Xanî**

**Roşan Lezgîn** di sala 1964an de li gundê Dingilhewa ya Licê hatiye dinyayê. Ji sala 1996 vir de li gelek kovar û rojnameyan bi kurdî (kirdkî û kurmancî) û tirkî nivîsên wî weşîyane. Niha edîtorîya rojnameya ***Newepelî*** û kovara edebî-hunerî ***Şewçilayê*** dike.

## Berhemên wî yên ku weşîyane:

**1)** Binê Dara Valêre de, Çapa yekem, Weşanxaneya Apecê, Stockholm 2002 / Çapa duyem, Weşanxaneya Vateyî, İstanbul 2003 / Çapa sêyem, Weşanxaneya Roşna, Dîyarbekir 2013

**2)** Dêsan de Sûretê Ma Nimite, Weşanxaneya Vateyî, İstanbul 2005

**3)** Ferhengê Îdyomanê Kurdkî, Weşanxaneya Vateyî, İstanbul 2005

**4)** Halîn, Weşanxaneya Komal, İstanbul 2006

**5)** Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneya Vateyî, İstanbul 2007

**6)** Sanikanê Dîyarbekirî ra Guldesteyêk, Enstîtuya Kelepûrê Kurdî, Silêmanîye 2009

**7)** Gotin Diçe Nivîs Dimîne, Weşanxaneya Pêrî, İstanbul 2009

**8)** Edebîyatê Kirmanckî ra Nimûneyî, Weşanên Enstîtuya Zimanên Zindî ya Unîversîteya Artukluyê, Mêrdîn 2012

**9)** Tarîyîya Adirî de, Weşanxaneya Roşna, Dîyarbekir 2012

**10)** Dersê Ziwanê, Weşanxaneya Roşna, Dîyarbekir 2012

**11)** Ferhengê Kurdî (Zazakî)-Tirkî û Tirkî- Kurdî (Zazakî), Weşanxaneya Roşna, Dîyarbekir 2013

## Wergerên wî yên ku weşîyane:

**1)** Suzan Samancı, Siya Bêdengiyê (Wergerandina ji tirkî), Weşanxaneya Aram, İstanbul 2001

**2)** Roşan Lezgîn, Li Bin Dara Bîyê, (Wergerandina ji kirdkî), Weşanxaneya Elma, İstanbul 2003

**3)** Sadiq Hîdayet, Sê Dilop Xwîn (Wergerandina ji farisî), Weşanxaneya War, Diyarbekir 2004

**4)** Malmîsanij, Cemîlpaşazadeyên Diyarbekirî û Neteweperwerîya Kurdî (Wergerandina ji tirkî), Weşanxaneya Vateyî, İstanbul 2008

**5)** İsmaîl Beşîkçî, Ziman - Nasname - Netewe û Neteweperwerî (Wergerandina ji tirkî), Weşanên Pêrî, İstanbul 2008

**6)** Andranîk, Dêrsim Raywanî û Cografya (Wergerandina ji kurmancî), Weşanxaneya Vateyî, İstanbul 2010

**7)** Berfîn Zenderlioglu & Mîrza Metîn, Mêrdeyê Şewe (Wergerandina ji kurmancî), Weşanên Avesta, İstanbul 2011

**8)** Perwerde de Tetbîqê Ziwanê Dayîke (Wergerandina ji tirkî), Weşanên DÎSAyê, Dîyarbekir 2013

**9)** Polîtîkayê Zafziwanîye û Plankerdişê Ziwanî (Wergerandina ji tirkî), Weşanên DÎSAyê, Dîyarbekir 2013

# NAVEROK


TEQRÎZ ........ 9
PÊŞGOTIN ........ 11
KURTNIVÎSÎN ........ 13
TERMÎNOLOJÎ ........ 14
1.EM ZIMANÎ BINASIN ........ 19
1.1.Ziman ........ 19
1.2.Zarava ........ 19
1.3.Şîwe ........ 20
1.4.Devok ........ 20
1.5.Kurdî ........ 20
1.6.Kirdkî (Zazakî) ........ 20
1.7.Şîwe di Kirdkî de ........ 21
1.8.Devokên Kirdkî ........ 22
Metna Xwendinê ........ 24
2.ALFABE ........ 26
2.1.Xwendina Herfên Alfabeyê ........ 26
2.2.Tabloya Alfabeya Me ........ 27
2.3.Herfên Bideng ........ 28
2.4.Herfên Bêdeng ........ 28
2.5.Ferqa Alfabeya Me û Alfabeya Tirkan ........ 28
2.6.Xusûsîyeta Hinek Herfên Din ........ 33
3.PEYV ........ 33
3.1.Avanîya Peyvan ........ 33
3.2.Xusûsîyeta Peyvên Kirdkî ........ 34
3.3.Peyvên Nêr ........ 37
3.4.Peyvên Mê ........ 40
3.5.Peyvên Pirhejmar ........ 42

3.6.Bikaranîna Peyvan ........ 43
3.7.Telefiza Peyvan ........ 48
3.8.Peyvên Biyanî ........ 49
Metna Xwendinê ........ 50
**4.NAVDÊR ........ 52**
4.1.Halê Navdêran ........ 54
4.1.1.Halê Xwerû yê Navdêran ........ 54
4.1.2.Halê Tewandî yê Navdêran ........ 54
4.2.Bi Paşqertafê Çêbûna Halî ........ 55
4.3.Bi Daçekê Çêbûna Halî ........ 56
4.4.Bi Guherîna Cihê Pêveberê Çêbûna Halî ........ 57
4.5.Paşqertafa Tewandina Navdêran ........ 58
Metna Xwendinê ........ 56
**5.RENGDÊR ........ 60**
5.1.Rengdêr ji Alîyê Nêrîtî, Mêkîtî û Pirhejmarîyê ve ........ 61
5.2.Rengdêr ji Alîyê Manayê ve ........ 62
5.2.1.Rengdêrên çawanîyê ........ 62
5.2.2.Rengdêrên dîyarkirinê ........ 62
5.2.2.1.Rengdêrên îşaretê ........ 63
5.2.2.2.Rengdêrên hejmarnavî ........ 63
5.2.2.3.Rengdêrên pirsê ........ 64
5.2.2.4.Rengdêrên nedîyarîyê ........ 64
Metna Xwendinê ........ 66
**6.CIHNAV ........ 68**
6.1.Cihnavên Kesan (Şexsan) ........ 68
6.2.Cihnavên Îşaretê ........ 69
6.3.Cihnavên "Xo", "Ci", "Pê", "Yê" ........ 71
6.4.Hinek Cihnavên Din ........ 72
Metna Xwendinê ........ 74
**7.HOKER ........ 76**
Metna Xwendinê ........ 78
**8.DAÇEK ........ 80**
8.1.Pêşdaçek ........ 80

8.2.Paşdaçek ... 82
8.3.Dordaçek ... 84
Metna Xwendinê ... 86
**9.GIHANEK ... 88**
Metna Xwendinê ... 92
**10.QERTAF ... 94**
10.1.Çend Pêşqertaf ... 95
10.2.Çend Paşqertaf ... 96
Metna Xwendinê ... 108
**11.PARTÎKEL ... 110**
Metna Xwendinê ... 112
**12.RAVEK ... 115**
12.1.Ravekên navdêran ... 115
12.2.Ravekên rengdêran ... 115
12.3.Ravekên rêzilkî ... 116
Metna Xwendinê ... 118
**13.BANEŞAN ... 120**
Metna Xwendinê ... 124
**14.HEJMARNAV ... 126**
**15.RADER ... 129**
15.1.Paşqertafa "-iş" (-yîş / -yayîş) ... 129
15.2.Paşqertafa "-ene" (-yene) ... 130
**16.LÊKER ... 131**
16.1.Lêkerên Xwerû ... 131
16.2.Lêkerên Hevedudanî ... 134
16.2.1.Preverba Yekkîteyî + Lêker ... 134
16.2.2.Preverba Pirkîteyî + Lêker ... 135
16.2.3.Navdêr + Lêker ... 137
16.2.4.Rengdêr + Lêker ... 138
16.2.5.Lêker + Lêker ... 138
16.2.6.Lêkerên Biwêjkî ... 139
16.3.Ergatîvî ... 140
16.4.Lêkerên Gerguhêz ... 141

16.5.Lêkerên Negerguhêz ........................................ 145
16.6.Lêkera Nîvco (Kopula) ........................................ 146
16.7.Lêkera Nîvco: "Bîyene/Bîyayîş" ........................................ 147
16.9.Lêkerên Alîkar ........................................ 147
16.10.Raweya Fermanê ........................................ 149
Metna Xwendinê ........................................ 150
**17.DI LÊKERAN DE RAWE ........................................ 152**
17.1.Dema Niha ........................................ 152
17.1.1.Dema niha ya nedîyar ........................................ 153
17.1.2.Dema niha ya dîyar ........................................ 157
17.1.3.Çîrokîya dema niha ........................................ 159
17.2.Dema Borî ........................................ 163
17.2.1.Dema borî ya dîyar ........................................ 163
17.2.2.Dema borî ya nedîyar ........................................ 165
17.2.3.Çîrokîya dema borî ........................................ 169
17.3.Dema Bê ........................................ 170
17.3.1.Dema bê ........................................ 170
17.3.2.Çîrokîya dema bê ........................................ 173
Metna Xwendinê ........................................ 178
**18.HEVOK ........................................ 181**
18.1.Kirde ........................................ 182
18.1.1.Kirdeya veşarî ........................................ 183
18.2.Bireser ........................................ 186
18.3.Pêveber ........................................ 187
18.4.Avanîya Hevokê ........................................ 188
18.5.Telefiza Hevokê ........................................ 188
18.6.Metna Xwendinê ........................................ 190
**19.GUHERÎNA DENGAN ........................................ 193**
**ÇAVKANÎ ........................................ 199**
**FERHENGOKA LÊKERÊN XWERÛ ........................................ 201**
**TABLOYA BIKARANÎNA LÊKERÊN XWERÛ ........................................ 218**

# ZIMANÊ XWE BINASE!

Em kurd ne bi rengê xwe, ne bi dînê xwe û ne jî bi awayekê giştî bi edet û texlîdên xwe ji cîranên xwe yên ereb, faris yan tirk cuda ne. Tiştê ku me ji wan cuda dike, tiştê ku me dike miletekê serbixwe û bi hebûna xwe serbilind, zimanê me anku kurdiya şîrîn e.

Mixabin em ne kurdiya xwe baş nas dikin û ne jî qedir û qîmetê wê dizanin. Mebesta min ne tenê kurdên asîmîlebûyî yan kurdên xweînkarker in. Gilî û gazina min ji wan kesan e ku bo peydakirina heqê gotina "Ben Kürdüm" (ez kurd im) jiyan û malê xwe li xwe dane herimandin lê rojekê jî bîr nebiriye ku li cihê wê slogana "Ben Kürdüm" giringiya wê sloganê bi zimanê xwe bizanin. Yan heke giringiya sloganan bi kurdî bizanin jî, giringiya zimanê xwe ji wê kûrtir û dûrtir yan nizanin yan jî ji xwe re nakin xem.

Li Bakurê Kurdistanê ev sed sal in ku ewrekê reş bi ser zimanê kurdî de girtiye. Van salan dewlet li ber bikaranîna kurdî qedexeyên xwe hinekî sist dike lê mixabin xwetirkkirina kurdan bi pêlên gelek dijwar didome: Berî bîst salan dema ku li Diyarbekirê dijiyam zimanê kurdî hê jî di axiftina xelkê de serdest bû, tevî ku bikaranîna kurdî di qadên resmî yan medyayî de bi her awayî qedexe bû. Niha êdî dewlet jî kurdî bi kar tîne lê kurdan bi xwe êdî di suhbetên xwe yên rojane de jî dest ji kurdî berdaye. Trajediyeka mezin jî ew e ku kesên bo kurd û Kurdistanê her tiştê xwe gorî û qurban kiriye jî, niha ji kurdên sade zêdetir dest ji kurdî berdaye!

Lê di vê şevtarîtiyê de jî hin xanim û camêr hene xebatên wisa dikin ku ne dost û ne jî dijminên zimanê kurdî dikarin bawer bikin. Bi xêra keda van hêjayan bend û berpiyên zimanê kurdî vedibin, bi kêmî em heyranên zimanê kurdî dikarin bi karê wan ji hev haydar bibin.

Yek ji van camêrên herî bijare û berhemdar kekê me Roşan Lezgîn e ku hevdem li çendîn aliyên zimanî û kultûrî xizmetên bêpayan bo zimanê kurdî dike. Ew ji bilî zaravaya xwe kirdkî anku zazakî, herwiha bi kurmancî jî dinivîse – ji piraniya me kurmancînivîsan biserketîtir jî. Wî çend berhemên hêja ji tirkî, farisî, kurdîya soranî, kurmancî û kirdkî jî wergerandine. Herwiha Roşan Lezgîn yek ji wan kêm kurdan e ku heta nivîsên wî yên bi tirkî jî hê-

jayî xwandinê ne.

Di berhema di destê we xwandevanên hêja de birêz Lezgîn hewleka jidil bo nasandina zaravayê me yê şîrîn kirdkî/zazakî bo kurmancîaxivan dide. Ya rast, xwandevan dê bi dehan tiştên balkêş ne tenê derbareyî kirdkî lê herwiha li ser rêzimana kurmancî jî hîn bibin: nivîserê kitêbê bi sîstematîkî qeyd û bendên rêzimana kirdkî û kurmancî dide ber hev, cudahî û wekheviyên wan pêşkêşî me dike.

Kitêb bi nasandina zimanê kurdî, zaravayên wî û devokên kirdkî dest pê dike. Piştî wê taybetmendiyên alfabeya kurdî tên ravekirin. Dû re mijar peyv û avaniya peyvan e. Paşî dor tê birrên peyvan: navdêr, rengdêr, cînav, hoker, hejmarnav... Herwiha taybetmendiyên ravek û qertafên kirdkî û kurmancî tên rêzkirin. Taliyê jî avakirina demên cuda yên lêkeran bi berfirehî tên berçavkirin. Li dawiyê jî tabloyên lêkeran li gel çawaniya çemandina / tewandina wan cih digirin.

Ev berhem hem bo hînberên kirdkî, hem bo vekolerên zimanê kurdî û hem jî bo her kesê mereqdarê taybetmendiyên zimanê kurdî kaniyeka avşîrîn û xezîneyeka zengîn e. Dilşa û bextiyar im ku berî weşandina vê kitêbê kek Roşanî ji camêriya xwe derfet û delîv dan min ku vê kitêba bihagiran bixwînim û dîtinên xwe li ser bibêjim. Wî ji nefsbiçûkiya xwe gelek ji pêşniyarên min qebûl kirin. Lê helbet biryara dawî li ser kitêbê di destê wî de bû û divê wisa be jî.

Di sed salên borî de eger qedera kurmancî reş bû, ya kirdkî hê çendcarî reştir bû: kurmancî li gelek welatan tê peyivîn lê kirdkî tenê li Tirkiyê, li cihê ku ew bi giranî hatibû qedexekirin. Bi awayekê giştî mixabin pêla asîmîlasyonê di nav kirdkîaxivan de heta ji kurmancîaxivan jî zêdetir e.

Lê carinan qedera ziman û miletan bi destê yek yan çend mêran e. Camêrên wek Roşan Lezgînî bi zêdeyî bîst kitêbên xwe yên weşandî (nivîsîn yan wergerandin), bi sernivîseriya tek rojnameya xwerû bi kirdkî û kovareka edebî deynê miletê xwe dayiyê û dê ji merdiya xwe hê jî bidiyê.

Bila şîrê maka wî ya kurdîziman li wî helal be û qedera zimanê wî yê zikmakî geş be!

**Helsînkî, 27.07.2013**
**Husein Muhammed**

# PÊŞGOTIN

Dema ku li salên 1990î, di şertên gelek xirab de min bi veşarî dest bi xwendin û nivîsîna kurdî (kirdkî û kurmancî) kir, min gramer nedizanî lê di prosesa xwendin û nivîsandinê de bi xwe hîn bûm.

Di navbera salên 2010-2013 de li Dîyarbekirê min şeş car kursên zimanî dan. Di kursa havîna 2011ê de sinifeka cihê ya ji kurmancên me jî hebû. Qasî deh-duwazdeh kes ji kurmancên me dixwestin fêrî kirdkî (zazakî) bibin. Me wisa program kiribû ku di hefteyê de du roj her perîyodekê du saet, em dê duwazdeh rojan kursê bidin. Lê ji ber ku germa havînê bû û pirranîya kursîyeran di karê televîzyongerîyê de dixebitîn, lewma hemîyan heta bi dawîyê dewam nekir. Lê tiştê muhîm ev bû ku wê demê min ji bo kurmancên me bi awayekî muqayeseyî dersên gramera kirdkî amade kirin. Ev e, bingeha vê kitêbê ew materyal in.

Di amadekirina ji bo kurmancan dersên kirdkî de wisa hat hesabkirin ku kursîyer ne ku xwendin û nivîsandina kurmancî dizanin belkî heta dereceyekê qayîdeyên gramerê jî dinasin. Yanî ji ber ku kirdkî û kurmancî du şaxên zimanekî ne, piştî ku kursîyer avanî, sîstem û gramera kirdkî fêr bibin, herwisa bişên rast bixwînin; peyv û hevokan rast telefiz bikin, hingê dê muşkileya têgihiştinê heta dereceyekê hel bibe. Heke têgihiştin çêbû, qisekirin û xweîfadekirin hêsan dibin.

Di vê kitêbê de jî eynî metod hatiye bikaranîn. Yanî bêhtir ji sifir fêrkirinê, bi nimûneyên muqayeseyî avanî, sîstem û gramera kirdkî dihê nîşandan. Lê zêdetir ji vê, kurmancên me yên ku heta dereceyekê di warê xwendin û nivîsandinê de pêşketî ne, dema ku di vê kitêbê de avanî, sîstem û gramera kirdkî dinasin, di eynî demê de dê qayîdeyên giştî yên zimanî jî fêr bibin. Çunke di her mijarekê de qayîdeyên zimanî bi awayekî zelal hatine ravekirin.

Guhdarîkirin, xwendin, têgihiştin û qisekirina zimanan mijulîyên ewçend rij nînin lê fêrbûna qayîdeyên gramerê dibe ku ji bo her kesî karê zewqê nebe. Ji vê çendê, me li dawîya her mijarekê met-

neka edebî ya kirdkî danî û wergera wê ya kurmancî jî li hember bicih kir. Ev metn dê alîkarîyê bikin ku hem xwendevan bi qasî edebîyatê ji gramerê jî zewqê bigrin hem jî bikarin kirdkî û kurmancî bêhtir muqayese bikin.

Dîsa, li dawîya kitêbê ferhengokek ji lêkerên xwerû yên kirdkî û kurmancî hat danîn û nimûneyek ji raweya deman a bikaranîna beşek ji van lêkeran jî hat bicihkirin ku sîstema kirdkî baştir bihê nasîn.

Tiştekî muhîm jî ev e ku divê behsa wê bibe. Li van salên dawîn gelek soran û kurmancên me li ser navê xwerûkirina zimanî, peyvên ji zimanên bîyanî ku bi hezarê salan di nav soranî û kurmancî de dihên bikaranîn jê derdixin û bêyî ku avanîya giştî û taybetîyên bingehîn yên kurdî (kirdkî, kurmancî, soranî, hewramî, lurrî), bigirin ber çavî, bi hêsanî peyvên nuh yên bêwate çêdikin û bikar tînin. Vê yekê kiriye ku kurmancî û soranîyeka çêkirî pêk were û bi taybetî zaravayên kurdî ji hev dûr bikevin. Helbet wekî parçeyên eslî yên sîstema zimanî peyvên xwemalî yên zimanekî gelek muhîm in. Lê rastî ev e ku zimanek ne ku bi peyvan esas bi sîstema xwe ya zimanî dibe ziman. Yanî dema ku peyv li gor qayîdeyên sîstema zimanî dihên ber hev û bi pêkhatina hevokê re manayekê çêdikin hingê wê demê ziman dibe ziman. Ji vê çendê bi awayekî giştî kurmancîya ku di vê kitêbê de hatîye bikaranîn, ne ew kurmancîya çêkirî ye.

Berî ku ev xebat wek kitêb çap bibe, birêz Husein Muhammed ku di warê zimannasîye de gelekî şareza ye, bi hûrbînî kontrol kir. Gelek cih redakte kirin û gelek jî pêşnîyazên wî çêbûn. Ji ber vê alîkarîya wî ya dostane ez bo cenabê wî sipasîyên xwe pêşkêş dikim.

Heta niha kirdkî bi zaravayên din yên kurdî re nehatîye muqayesekirin. Bi vê xebatê re qet nebe alîyên hevpar û cihê yên kirdkî û kurmancî heta dereceyekê xuya dibin. Bi hêvîya ku di warê zimanasîya kurdî de valahîyekê dagire û kurmancên me jê îstîfade bikin, bila li miletê kurd pîroz be.

**Dîyarbekir, 20.07.2013**
**Roşan Lezgîn**

## KURTNIVÎSÎN

**alm**: almanî; almankî
**er**: erebî; erebkî
**fr**: fransî; franskî
**îng**: înglîzî; înglîzkî
**îtl**: îtalyanî; îtalyankî
**(m)**: mê; makî
**(n)**: nêr; nêrkî
**(n m)**: nêr û mê bi hev re; nêrkî û makî pîya
**(ph)**: pirhejmar
**r**: rûpel; rîpel
**tr**: tirkî
**(yh)**: yekhejmar; yewhûmar
**(zh)**: zafhûmar

# TERMÎNOLOJÎ

**alfabe**: alfabe (m)
**apostrof**: apostrof (n)
**avanî**: awanî (m)
**baneşan**: înterjeksîyon (n)
**bêhnok**: vîrgul (n)
**bêje**: çeku (m)
**bêjeyên hevedudanî**: çekuyê pêrabesteyî
**bêjeyên xwerû**: çekuyê sadeyî
**bireser**: obje (m)
**cihnav**: zemîr (n)
**cihnavê xwedîtîyê**: zemîrê wayîrîye
**cihnavên kesane**: zemîrê şexsan
**cihnavên pirsînê**: zemîrê persan
**cihnavên tewandî**: zemîrê anteyî
**cihnavên xwerû**: zemîrê sadeyî
**çawanî**: senînî (m)
**çendinî**: çendinî (m)
**daçek**: edat (n)
**paşdaçek**: peyedat (n)
**pêşdaçek**: veredat (n)
**dordaçek**: veredat û peyedat pîya
**dem**: dem (n)
**dema borî**: demo vîyarte
**çîrokîya dema borî**: hîkayeya demê vîyarteyî
**dema borî ya dîyar**: demo vîyarteyo dîyar
**dema borî ya nedîyar**: demo vîyarteyo nedîyar

**dema bê**: demo ameyox
**çîrokîya dema bê**: hîkayeya demê ameyoxî
**dema niha**: demo nikayên
**dema niha ya dîyar**: demo nikayino dîyar
**dema niha ya nedîyar**: demo nikayino nedîyar
**çîrokîya dema niha**: hîkayeya demê nikayênî
**deng**: veng (n)
**dengdar**: bêveng, -e
**dengdêr**: vengin, -e
**devok**: fek (n)
**erênî**: pozîtîfî
**ergatîv**: ergatîv (n)
**ferman**: ferman (n)
**gerguhêz**: transîtîf, -e
**gihanek**: bestox, -e
**gotin**: vate (n)
**hejmarnav**: hûmarname (n)
**hevmana**: hemmana (m)
**herf**: herfe (m)
**herfa bêdeng**: herfa bêvenge
**herfa bideng**: herfa vengine
**hevdeng**: hemveng, -e
**hevok**: cumle (m)
**hevoka lêkerî**: cumleya karî
**hevoka navdêrî**: cumleya nameyî
**hevokên hevedudanî**: cumleyê pêrabesteyî
**hoker**: zerfe (m)
**hokera cîhetê**: zerfa cîhetî
**hokera cihî**: zerfa cayî
**hokera çendinîyê**: zerfa çendinîye
**hokera demê**: zerfa demî
**hokera pirsê**: zerfa persî
**hokera rewşê**: zerfa rewşe

**îşaret**: îşaret (n)
**kes**: kes, -e; şexs, e
**kirde**: kerdox, -e
**kişandin**: antiş (n)
**kîte**: hece (m)
**lebatî**: lebatî (m) (aktîv)
**lêker**: kar (n)
**mana**: mana (m)
**mê**: makî (m)
**nav**: name (n)
**navdêr**: name (n)
- **navdêrên cinsî**: nameyê cinsî
- **navdêrên hevedudanî**: nameyê pêrabesteyî
- **navdêrên taybetî**: nameyê taybetî
- **navêdêrên xwerû**: nameyê sadeyî

**negerguhêz**: întransîtîf, e
**nêrîtî**: nêrkî (m)
**neyînî**: negatîfî (m)
**partîkel**: partîkel (n)
**peyv**: çeku (m)
- **peyvên hevedudanî**: çekuyê pêrabesteyî
- **peyvên sade**: çekuyê sadeyî

**pêveber**: kardar (n)
**pirhejmar**: zafhûmar, -e
**qertaf**: îlawe
- **paşqertaf**: sufîks (n)
- **pêşqertaf**: prefîks (n)

**preverb**: preverb (n)
**rader**: mesder (n)
**rastnivîsîn**: rastnuştiş (n)
**rawe**: rawe (m)
- **raweya divêtîyê**: raweya ganîyîye
- **raweya fermanî**: raweya fermanî

**raveber**: muzaf (n)
**ravek**: îzafe (n)
**rengdêr**: sifet

**rengdêrên hejmarî**: sifetê hûmarnameyî
**rengdêrên xwerû**: sifetê sadeyî
**rengdêrên hevedudanî**: sifetê pêrabesteyî

**rêziman**: gramer (n)
**rêzkî**: rêzilkî (m)
**serenav**: nameyê taybetî
**şîwe**: şîwe (m)
**tebatî**: tebatî (m) (pasîv)
**tewandî**: tewênaye (n), tewênaya (m); oblîk, -e
**tewandin**: tewênayîş (n)
**têrker**: temamker (n)
**veqetandek**: îlawe
**xal**: nuqta (m)
**xalbendî**: nuqtabendî (m)
**xwerû**: sade; xoser, -e
**yekhejmar**: yewhûmar
**zarava**: lehçe (m)
**zayend**: cinsîyet (n)
**ziman**: ziwan (n)

# 1.EM ZIMANÎ BINASIN

## 1.1.ZIMAN

Ziman, wek sîstemeka sembol, îşaret û şîfreyan wasitaya fikirîn, xweîfadekirin û fêmkirinê ye. Lê di manaya fireh de, ji bo miletan zemîna pêkhatina kultur, edebîyat û nasnameya neteweyî ye. Milet bi saya zimanî tarîxa xwe, serpêhatî û tecrubeyên xwe, fikr û tesewurên xwe, zanîna xwe neqlî neslên xwe yên siberojê dikin. Ziman ruh, reh û qelbê jîna miletî ye. Miletên ku zimanê xwe winda bikin di eynî wextê de nasnameya xwe ya neteweyî jî winda dikin. Lewma di nav meriv û zimanê bav û kalan de girêdaneka hissî heye.

Ziman jî eynî wek zarok yan jî kulîlkekê, ji bo ku jîna xwe baş û bisihet bidomîne, hewceyî miqatebûyînê ye. Zimanê ku sîstema xwe, usûl û qaydeyên gramera xwe, mekanîzma û mentiqê xwe, sembol, îşaret û şîfreyên xwe tesbît û tesnîf nebin, qayîdeyên nivîsîna xwe standardîze nebin, bikaranîn û bi taybetî jî jîyîna wî zimanî zehmet dibe.

Ziman bi awayekî safî tenê ji şeklekê nayê meydanê. Gelekê zimanan di nav xwe de li ser zarava, şîwe û devokan cihê dibin.

## 1.2.ZARAVA

Ziman di tarîxeka kevin de ji sedemên cihê bi cihê li ser hinde şaxan parve dibin û dû re, di nav van şaxan de ferqên muhîm pêk dihên. Di îlmê zimanzanîyê de ji van şaxên zimanî re dibêjin **zarava**. Ji ber ku nayê zanîn zaravayên zimanekî kengî ji hev cihê bûne lewma ferqên ku di nav zaravayan de hene jî ewçend hêsan

îzeh nabin. Yanî cihêtîya di nav zaravayan de tiştekê xwezayî ye.

Herçiqas "zarava" wisa tarîf bibe jî di eslê xwe de tarîfek yan jî çarçeweyeka qethî ya zaravayê tune ye.

### 1.3.ŞÎWE

Di tarîxeka nêzîk de jî ji ber hinde sedeman di nav grûpên civakî yên miletekî de ji alîyê zimanî ve hinek ferqên piçûk çêbûne. Di îlmê zimanzanîyê de ji van ferqan re dibêjin **şîwe**.

### 1.4.DEVOK

Di ziman de yan jî di zaravayê de ferqên piçûktir ji şîweyê ku herêm bi herêm, gund bi gund yan jî mal bi mal heta ku meriv bi meriv ferq dikin re jî di îlmê zimanzanîyê de dibêjin **devok.**

### 1.5.KURDÎ

Di cîhanê de gelek famîlyayên cihê yên zimanan hene. Mesela, ji van çend heb ev in: famîlyaya **samî-hamî**, famîlyaya **ural-altayî**, famîlyaya **hînd-ewropayî**...

Di nav famîlyayên mezin de jî grûp hene. Mesela, di nav famîlyaya hînd-ewropayî de **grûpa îranî**, **grûpa hindî**, **grûpa cermenî** ûhd hene.

Zimanê kurdan **kurdî** di famîlyaya **hînd-ewropayî** de ji **grûpa îranî** ye.

**Kurdî**, navê zimanekî homojen nîye, navê muşterek yê pênc zaravayan e:

1) **kirdkî** (kirmanckî, zazakî, dimilkî)
2) **kurmancî** (kirdasî, badînî)
3) **soranî** (mukrî, babanî)
4) **hewramî** (goranî)
5) **lurrî** (kelhurî, lekî, bextîyarî)

### 1.6.KIRDKÎ (ZAZAKÎ)

Kirdkîya ku yek ji pênc zaravayên kurdî ye, bi çar navên cihê bi

nav dibe:

**1) kirdkî**
**2) kirmanckî**
**3) dimilkî**
**4) zazakî**

Li Dîyarbekir, Çewlîg û beşeka Xarpêtê ji xwe re dibêjin **kird** û ji zaravaya xwe re jî dibêjin **kirdkî**. Li Dêrsim, Erzingan û Mûşê ji xwe re dibêjin **kirmanc** û ji zaravaya xwe re jî dibêjin **kirmanckî**. Li Çêrmûg, Sêwreg, Aldûş û Motkanê ji xwe rê dibêjin **dimilî** û ji zaravaya xwe re jî dibêjin **dimilkî**. Li beşeka Xarpêtê jî ji xwe re dibêjin **zaza** û ji zaravaya xwe re jî dibêjin **zazakî**. Ji van navan **kird** û **kirmanc** navên etnîkî ne, **dimilî** û **zaza** navên eşîran e. Ji ber ku piranîya axaftvanên vê zaravayê ji xwe re dibêjin **kird** û ji zaravaya xwe re jî dibêjin **kirdkî**, em dê jî vî navî bi kar bînin.

## 1.7. ŞÎWE DI KIRDKÎ DE

Di kirdkî de du şîweyên bingehîn hene:

**1) Şîweya Dêrsimê**
**2) Şîweya Derveyî Dêrsimê**

Di nav her du şîweyan de ji alîyê qayîdeyan ve ferq hene lê esas ferqên muhîm di bikaranînan lêkeran (kar; fiîl) û guherîna dengan de ne. Em hevokekê binivîsin û hinek ferqên ku derdikevin nîşan bidin:

"Ma nanê xwu wenê, agêrenê şinê keyê xwu." (Şîweya derveyî Dêrsimê)
"Ma nonê xo weme, cêreme ra some ve çeyê xo." (Şîweya Dêrsimê)
**Kurmancîya wê**: "Em nanê xwe dixwin, vedigerin diçin mala xwe."

Wekî ku dixuye, dengê **a** û **o**, dengê **u** û **o**, dengê **g** û **c**, dengê **ş** û **s**, dengê **i** û **o**, dengê **k** û **ç** bi yekûdin guherîne.

Heke em xususîyet û ferqên di nav şîweyan de baş binasin, bi taybetî di fêmkirina ji kirdkî de karê me hêsan dibe.

## 1.8.DEVOKÊN KIRDKÎ

Di her zimanî de devok hene lê di zimanên ku dereng pê hatîye nivîsîn û pê perwerde nebûye de zêdetir in. Hema bibêjin ku her gundek **devokekê** qise dike.

Di devokan de, gelek hindik be jî di hebûna hinek peyvên cihê de ferq hene. Lê esas, di forma peyvan de ferq hene. Mesela, Grûba Xebate ya Vateyî di manaya peyva "mûrî" ya kurmancî de ji devokên cihê bi cihê yên kirdkî ev form berhev kirine:

**mûrî**: *morcela, morceli, miclewri, mijlewri, mijloli, miclor, miclol, mijlor, mijlori, mijlowri, mijmewli, micmewl, mîyercila, mocla, mojla, muejla, mojle, molcela, molcila, moncle, morcila, muercela, muerceli, mercueli, merjueli, morzela; mijlewreki, mijloki, milorçike, miloçike, muloçike, muleçike.*

Ji aliyê ferqa peyvan ve jî, Grûba Xebate ya Vateyî di manaya peyva "zarok" ya kurmancî de ev nav berhev kirine:

**zarok**: gede (n), geda (m); zak (n), zaka (m); leyîr, -e; doman, -e; qeçek, -e; qic, -e; put, -e; tut, -e; lorik, -e; eyel, -e; mindal, -e

Me li vir tenê du nimûne nîşan dan. Heke em van ferqan binasin, di xwendinê de û bi taybetî jî di qisekirinê de problemên fêmkirina ji kirdkî kêmtir dibin.

Em hinekî din derheqê devokên kirdkî de melumat bidin. Mesela, di Şîweya Derveyî Dêrsimê de devoka Motkanê, devoka Licê, devoka Çewlîgê, devoka Hêni û Pîranê, devoka Çêrmûg, Sêwreg û Alduşê, devoka Şankuş û Madenê, devoka Paliyê yên sereke ne.

Dîsa di Şîweya Dêrsimê de jî devoka Gimgimê, devoka Karêrê û gelek devokên navenda Dêrsimê hene.

Ji alîyê devokan ve, ev tesnîfeka giştî ye. Mesela, dema ku em dibêjin "devoka Licê", devokeka yekpare ya homojen nîye. Her gundek xwedîyê xususîyeteka cihê ye.

Em dişên bi hevokekê nîşan bidin ku çend gundên Licê yên li nêzîkî hev çawa peyvan telefiz dikin û ferqeka çawa di nav devoka

wan de heye.

Dingilhewa: “Bay min û di hey birê min çar rocî yo şîyê xewate.”
Kirdasîya: “Bayyê min û di hey birê min çar rocî yo şîyê xewate.”
Herage: “Babê min û di hebî birê min çar rocî yo şîyê xebate.”
Dêrcimte: “Buy min û di hêy birê min çar rojî yo şîyê xewati.”

Eynî hevok di devoka Pîranê de wisa dihê gotin:
“Pêrdê min û di heb biray mi çeher rojî yo şîyê xebati.”

Di devoka Çewlîgê de wisa dihê gotin:
“Bay min û di hêw birêy mi çiyer ruejî yo şîy xewat.”

Kurmancîya hevokê wisa ye:
“Bavê min û di heb birayên min çar roj e çûne xebatê.”

Xulasa, meriv dişê di her gundekî de rastê devokeka cihê bihê. Ferqa di navbera devokan de bêhtir ji qayîdeyên gramerê di telefiza peyvan de ye.

# PERSKERDIŞ

- Selamuneleykum.
- Eleykumselam.
- Ti senîn î, baş î?
- Ez baş a, ti senîn î?
- Ez zî baş a. Babî û dadî, qic-micî senîn ê?
- Ti weş bî, merg ra baş ê.
- Keyfê înan senîn o, heme gewz ê?
- Weşîya to, ti weş bî.
- Dat û datizayî senîn ê?
- Hewna ti weş bî, merg ra baş ê.
- Keyfê înan senîn o, heme gewz ê?
- Wa dostî weş bê!
- Xal û xalîzayî senîn ê?
- Wa saxî û selametîya dostan bo.
- Keyfê înan senîn o, heme gewz ê?
- Şukur Homayî rê. . .
- Û êdî keyfê to senîn o, ti gewz î?
- Homa to ra razî bo! De ti vinde, nara ez pers kena: Babî û dadî, qic-micî, dat û datizayî, xal û xalizayî, ga û pesê şima, biz û bizêkê şima, mî û verekê şima, kergî û dîkê şima, herî û qantirê şima senîn ê, heme gewz ê?
- . . . (*)

*Roşan Lezgîn, Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2007, r. 9

# PIRSKIRIN

- Selamuneleykum.
- Eleykumselam.
- Ti çawa yî, baş î?
- Ez baş im, tu çawa yî?
- Ez jî baş im. Bav û dê, piçûk-miçûk çawa ne?
- Tu xweş bî, ji mirinê baş in.
- Keyfa wan çawa ye, hemî gewz in?
- Xweşîya te, tu xweş bî.
- Mam û pismam çawa ne?
- Dîsa tu xweş bî, ji mirinê baş in.
- Keyfa wan çawa ye, hemî gewz in?
- Bila dost xweş bin!
- Xal û pisxal çawa ne?
- Bila saxî û selametîya dostan be.
- Keyfa wan çawa ye, hemî gewz in?
- Şukur ji Xwedê re...
- Û êdî keyfa te çawa ye, tu gewz î?
- Xwedê ji te razî be! De tu bisekine, îcar ez pirs dikim: Bav û dê, piçûk-miçûk, mam û pismam, xal û pisxal, ga û pezê we, bizin û karikên we, mîh û berxikên we, mirîşk û dîkên we, ker û qantirên we çawa ne, hemî gewz in?

- ...

# 2.ALFABE

Ji bo nivîsîna her zimanekî ji koma herfan ku her yek teqrîben dengekî temsîl dike re dibêjin **alfabe**.

Alfabeya kurdan ya latînî 31 herf in. Di sala 1930î de Celadet Alî Bedirxan li Şamê ji bo kurdî alfabeyeka latînî amade dike. Ekrem Cemîlpaşa û Hemzeyê Muksî vê alfabeyê rexne dikin. Piştî van rexneyan Celadet Alî Bedirxan, Hemzeyê Muksî, ji kurdên Şamê Mûsa Beg û Ekrem Cemîlpaşa di sala 1931ê de li Şamê di mala Elî Axa Zilfoyî de kom dibin û wek komîsyonekê alfabeya latînî ya ku îro kurd pê dinivîsîn, qebul dikin (*). Herçendî hinek kesan carinan hinek herfên cihê jî tercîh kiribin lê ji wê rojê bi vir de kurdan ev alfabe bikar anîye.

Di zimanê nivîskî de alfabe kilîda zimanî ye. Ji bo hînbûna zimanekî divê berî hemî tiştî alfabe baş bihê nasîn. Heke alfabe hate nasîn, xwendin û nivîsîn hêsan dibin.

## 2.1.XWENDINA HERFÊN ALFABEYÊ

Di kirdkî de peyva "alfabe" û peyva "herf"ê mê ne. Lê wek deng, her herf bi tena serê xwe nêr dihê gotin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Oyo ke to nuşt N nêbi, Z bi. | Ewa ku te nivîsî N nebû, Z bû. |

Xwendina herfên alfabeyê jî bi kirdkî wisa ye: a, be, ce, çe, de, e, ê, fe, ge, he, i, î, je, ke, le, me, ne, o, pe, qe, re, se, şe, te, u, û, ve, we, xe, ye, ze.

---

*Malmîsanij, Cemîlpaşazadeyên Diyarbekirî Û Neteweperweriya Kurdî, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2008, r. 217

## 2.2.TABLOYA ALFABEYA ME

| Herf | Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|---|
| Aa | Agirî, adir, awe | Agirî, agir, av |
| Bb | Bidlîs, bira, bîbik | Bidlîs, bira, bîbik |
| Cc | Cemşîd, ca, cemed | Cemşîd, cih, cemed |
| Çç | Çemçemal, çem, çim | Çemçemal, çem, çav |
| Dd | Dîyarbekir, dare, dest | Dîyarbekir, dar, dest |
| Ee | Erzingan, edebîyat, ez | Erzingan, edebîyat, ez |
| Êê | êrxat, êdî, kêran | êrxat, êdî, kêran |
| Ff | Ferat, fal, faris | Ferat, fal, faris |
| Gg | Gimgim, ga, giran | Gimgim, ga, giran |
| Hh | Helebçe, hak, henare | Helebçe, hêk, henar |
| Ii | asin, bize, sifir | hesin, bizin, sifir |
| Îî | Îlam, îne, îsot | Îlam, în, îsot |
| Jj | jan, jehr, jêhatî | jan, jehr, jêhatî |
| Kk | Kurdistan, kavir, kemere | Kurdistan, kavir, kevir |
| Ll | Licê, lamba, lazut | Licê, lamba, lazut |
| Mm | Mûş, mase, mêman | Mûş, masî, mêvan |
| Nn | Newroze, nan, newe | Newroz, nan, nuh |
| Oo | Oremar, oda, ofîs | Oremar, ode, ofîs |
| Pp | Pîran, payîz, peme | Pîran, payîz, pemû |
| Qq | Qers, qeleme, qumaş | Qers, qelem, qumaş |
| Rr | Riha, rêze, rojawan | Riha, rêz, rojava |
| Ss | Semsûr, saz, saye | Semsûr, saz, sêv |
| Şş | Şirnex, şeş, şewe | Şirnex, şeş, şev |
| Tt | Tetwan, tace, texte | Tetwan, tac, texte |
| Uu | Urmîye, gule, kurd | Urmîye, gul, kurd |
| Ûû | Ûganda, dûrî, huqûq | Ûganda, dûr, huqûq |
| Vv | Vatîkan, vizeviz, vinik | Vatîkan, vizeviz, vinik |
| Ww | Wan, welat, ware | Wan, welat, war |
| Xx | Xarpêt, xal, xewxe | Xarpêt, xal, xewx |
| Yy | Yemen, yar, yew | Yemen, yar, yek |
| Zz | Zaxo, zama, zerd | Zaxo, zava, zer |

## 2.3.HERFÊN BIDENG

Ji dengên ku rasterast ji dev derdikevin û bê ku alîkarîya herfeka din bigrin dihên gotin re dibêjin **herfên bideng**.

Di alfabeya me de 8 **herfên bideng** hene: **Aa**, **Ee**, **Êê**, **Ii**, **Îî**, **Oo**, **Uu**, **Ûû**

Ji van 5 jê **herfên bideng yên dirêj** in: **Aa**, **Êê**, **Îî**, **Oo**, **Ûû**

Ev 3 herf jî **herfên bideng yên kin** in: **Ee**, **Ii**, **Uu**

## 2.4.HERFÊN BÊDENG

Ji dengên ku li derketina di dev re rastê asîmanê dev, diran û lêvan dibin û bi alîkarîya herfeka bideng dihên gotin re dibêjin **herfa bêdeng**.

Di alfabeya me de 23 herfên bêdeng ev in: **Bb**, **Cc**, **Çç**, **Dd**, **Ff**, **Gg**, **Jj**, **Hh**, **Kk**, **Ll**, **Mm**, **Nn**, **Pp**, **Qq**, **Rr**, **Ss**, **Şş**, **Tt**, **Vv**, **Ww**, **Xx**, **Yy**, **Zz**

## 2.5.FERQA ALFABEYA ME Û ALFABEYA TIRKAN

Alfabeya me jî wek alfabeya tirkan fonetîk e. Yanî her herf teqrîben dengekî temsîl dike. Lêhevçûyîna alfabeya me û alfabeya tirkan ji aliyekî ve rehetîyê dide kesên ku nuh hînê xwendin û nivîsîna kurdî dibin. Lê ji layekî ve, bi taybetî di herfên "**Ii**", "**Îî**", "**Uu**" û "**Ûû**" de, hem di xwendin hem nivîsînê de xwe şaş dikin. Şaşbûyîn, ji ber tesîra alfabeya tirkan dihê. Lewma divê herfên alfabeya me baş bihên hînbûn.

Ev 23 herfên alfabeya me û alfabeya tirkan eynî wek hev dihên xwendin: **Aa**, **Bb**, **Cc**, **Çç**, **Dd**,**Ee**, **Ff**, **Gg**, **Jj**, **Hh**, **Kk**, **Ll**, **Mm**, **Nn**, **Oo**, **Pp**, **Rr**, **Ss**, **Şş**, **Tt**, **Vv**, **Yy**, **Zz**

Ev 4 herfên alfabeya tirkan di ya me de tune ne: **Ğğ**, **İ**, **ı**, **Öö**, **Üü**

Ev 6 herf di alfabeya me de hene lê di ya tirkan de tune ne: **Êê**, **Îî**, **Qq**, **Ûû**, **Ww**, **Xx**

Em van her şeş herfan yek bi yek îzeh bikin:

* **Êê**: Dengê vê herfê, teqrîben dengekî di nav dengê "**Ii**" û "**Ee**"yê alfabeya tirkan de ye. Yanî dengê ku di peyvên "belê",

“êvar”, “kêran” û “pêrar” de ye.

* **Ii**: Ev herfa me wek alfabeya îngilîzî, gava ku gir dihê nivîsîn bênuqta wek “**I**”, gava ku piçûk dihê nivîsîn binuqta wek “**i**” dihê nivîsîn.

* **Îî**: Dengê vê herfa me ji dengê “**İi**”yê alfabeya tirkan piçekî din dirêj e.

Em awayê nivîsîna van her du herfên dawîn (**Ii** û **Îî**) hem bi herfên gir hem bi herfên piçûk nîşan bidin:

**Kirdkî:** “BIRAYÎYA LUYÎ Û QULINGÎ” “Birayîya Luyî û Qulingî”

**Kurmancî:** “BIRATÎYA RÛVÎ Û QULINGÎ” “Biratîya Rûvî û Qulingî”

Dengê “**Ii**”yê alfabeya me dengekî mîna “**Iı**”ya alfabeya tirkan dixuye lê bêhtir wek dengekî di nav “**Iı**” û “**İi**”yê alfabeya tirkan de ye. Dengê “**Îî**”yê alfabeya kurdan jî dengekî nêzîkê “**İi**”yê alfabeya tirkan e lê ji wî piçekî din tûjtir e. Em di hevokekê de her du dengan wek nimûne nîşan bidin:

**Kirdkî**: “Min û **bi**rayê xo me awa **bî**rî şimite.”

**Kurmancî**: “Min û **bi**rayê xwe me ava **bî**rê vexwar.”

Wekî ku dixuye, di peyvên “**bi**ra” û “**bî**ra”yê de ev deng ferqa xwe nîşan didin.

* **Qq**: Ev deng wek “**Qq**”yê îngilîzî nerm nîye, yê me teqabulê “**q**af (ق)”ê erebî dike, ji qirikê derdikeve. Mesela, di peyvên wek “**q**alin”, “**q**erwaş”, “**q**esab” û “**q**irik”ê de ev deng tam dîyar dibe.

Carinan hinek kurd, bi taybetî kurdên nava Dîyarbekirê, ji ber tesîra tirkîya mehelî dengê “**Kk**”yî mîna dengê “**Qq**”yî dixwînin. Lê di eslê xwe de dengê “**Kk**”yî mîna “**K**af” (ك)ê erebî nerm, dengê “**Qq**”yî jî mîna “**q**af (ق)”ê erebî qalind e.

* **Uu**: Ev dengê me hîn bêhtir nêzîkê "**Üü**"yê alfabeya tirkan dixuye lê esas dengekî di nav "**Uu**" û "**Üü**"yê alfabeya tirkan de ye.

* **Ûû**: Ev dengê me jî ji dengê "**Uu**"yê alfabeya tirkan piçekê din dirêjtir e.

Kurdên-ku bi tirkî perwerde bûne, gava ku nuh hînê xwendin û nivîsînê dibin, herî zêde dengên "**Uu**" û "**Ûû**"yî li nav hev dixin. Esas hîn bêhtir dibêjin qey "**Ûû**"yê me teqabulê "**Üü**"yê alfabeya tirkan dike. Ji bo ku em baş fêm bikin, em di hevokekê de her du dengên dawîn wek nimûne nîşan bidin:

**Kirdkî**: "Kurdî **Û**ganda ra nîyê, Kurdistan ra yê!"

**Kurmancî**: "Kurd ji **Û**gandayê nîn in, ji Kurdistanê ne!"

Wekî ku dixuye, dengê "**Uu**"yê ku di peyva "kurd" de ye, herçendî nêzîkê dengê "**Üü**"yê peyva "Kürt" yê telafuza tirkan de be lê eynî deng nîye. Û dengê "**Ûû**"yê kurdan jî ji dengê "**Uu**"yê tirkan piçekê din dirêjtir e. Wek ku di peyvên "qan**û**n" yan jî "huq**û**q"ê de dihê gotin, wisa dirêj e.

* **Ww**: Dengê vê herfa me mîna "waw (و)"ê erebî yan jî "double w"yê înglîzî ye ku di peyva "**W**ashington"ê de heye.

Hinek kurd carinan dengên "**Ww**" û "**Vv**"yî li nav hev dixin. Mesela, di şûna "he**v**al" de "he**w**al" dinivisînin yan jî dibêjin. Lê ev du dengên bingehîn û cihê ne. Em bibêjin, di peyva "**v**e**w**re" (befr) ya kirdkî de her du deng xwe tam nîşan didin. Bi nimûneyên kurmancî cudahî çêtir tê fêmkirin: "**v**ir/**w**ir, **v**ê/**w**ê, e**v**/e**w**".

* **Xx**: Ev herfa me wek "îkz"a înglîzî ye lê dengê xwe mîna "**Xe** (خ)"ya erebî ye. Mesela, di peyvên "**x**atun", "**x**ebat", "**x**este**x**ane" û "**x**îyar"î de.

Herfa dengê "**xeyn** (غ)"ê erebî ku di tirkî de mîna "**Ğğ**"yê dihê nivîsîn di kurdî de tune ye. Lê çend peyvên ku ev deng tê de heye, bi herfa "**Xx**" dihên nivîsîn. Em bibêjin ku di peyvên mîna "**x**alib"

"xerîb" "xezal" û "xurbet"ê de.

Çavîya dengê "x" û dengê "ğ" yek e, tenê ferqeka nuansî di nav van her du dengan de heye. Lewma hewce nake ku meriv ji her dengê nuansî re herfekê dayne û alfabeyê giran bike. Di gelek zimanan de, du yan çend dengên ku di fonetîkê de çavîya wan yek e, lê mîna nuansî ferqên dengî di nav wan de hene, tenê bi herfekê temsîl dibin. Xwendevan yan jî axaftvanên wî zimanî bi awayekî xwezayî van dengan ferq dikin.

## 2.6.XUSUSÎYETA HINEK HERFÊN DIN

Di alfabeya me de çend herfên din hene ku mîna herfa "**Xx**" du dengên nêzî yekûdin temsîl dikin. Em bala xwe bidin ser:

* **Ee**: Ev herfa alfabeya me, di hinek peyvan de li şûna "**eyn** (ع)"a erebî jî dihê bikaranîn. Em bibêjin ku di peyvên mîna "**E**lî", "**e**şîr" û "sa**e**t"ê de.

* **Hh**: Ev herfa alfabeya me jî du dengên nêzî yekûdin temsîl dike. Em bibêjin ku dengê "**hê** (ه)"ya erebî ya ku di peyvên "**h**îlal", "**h**edîye", "**h**ewa"yê de û dengê "**ha** (ح)"ya erebî ku di peyvên "**h**emam", "**h**eram, ""**h**ine" û "**h**eq"î de heye, ji hev cihê ne. Lê di alfabeya me de bi herfekê, yanî bi herfa "**Hh**" temsîl dibin.

* **Kk**: Ev herfa me jî du dengên nêzîkê yekûdin temsîl dike. Em bibêjin, gava ku em dibêjin "**k**ate, **k**alik, **k**ardî" (hestî, **k**alik, **k**êr) nerm û gava ku em dibêjin "**k**esa, **k**ewe, **k**emere" (**k**usî, şîn, **k**evir) piçekî hişk, du dengên cihê yên "**k**"yê derdikevin.

* **Ll**: Ev herfa me jî du dengên nêzîkî yekûdin temsîl dike. Em bibêjin di peyvên "**l**ew, **l**ete" (lêv, kerî) û "**l**amba, **l**êl" (**l**amba, şê**l**o) de. Di her du peyvên dawîn de dengê "**Ll**"yê qalind e. Dengê stûr yê "**Ll**"yê hîn bêhtir di zaravaya soranî de heye. Mesela di peyva "be**l**am" de.

* **Rr**: Di nav peyvê de, yek qalind yek tenik, du dengên "**Rr**"yê hene. Dengê tenik yê "**Rr**"yê denge bingehîn e. Lê peyvên ku bi "**Rr**"yê qalind jî dihên gotin zaf in. Û ji bo ku tevlihevî çênebe, di nivîsîna kirdkî de dengê qalind bi du "**rr**"yan dihê nivîsîn. Yanî du "**rr**" bi hev re bihên nivîsîn, ev wek di tirkî de dibêjin "Abdu**rr**ahman", du "**rr**"yên şidandî nînin. Tenê dengekê qalind e. Em bibêjin mîna ku di peyvên "ke**rr**", "ke**rr**a", "se**rr**e", "se**rr**adî", "ze**rr**î" (ke**rr**, kevir, sal, se**rr**ad, dil) ûhd de heye.

* **Ss**: Ev herfa me jî di hinek peyvan de, em bibêjin di peyvên mîna "**s**îye" (sî) ku wek dengê "sîn (س)"a erebî ye û "**s**îye" (kevir) ku wek dengê "sad (ص)"a erebî ye, her du jî di kirdkî de hene. Di kurmancî de jî di peyvên mîna "**sis**ê, **s**ivik" de wek dengê "sîn (س)"a erebî lê di peyvên "**s**eg" (kûçik) û "**s**al" de jî wek dengê "sad (ص)"a erebî ye. Lê peyvên ku bi dengê qalind yê "**s** (ص)" dihên gotin, di kirdkî de zaf kêm in.

Jixwe gava ku em dixwînin, em yek bi yek herfan naxwînin. Koma herfan ku hatine ber hev û peyvê anîne meydan, em wek kombînazonekê di carekê de peyvê dixwînin. Lewma hewce nake ku ji bo her dengekê nuansî herfek çêbibe û alfabeya ma giran bibe.

# 3.PEYV

Ji deng yan jî koma dengan ku wek parçeyên bingehîn yên zimanî hatine ber hev û xwedîyê mana ne re dibêjin **peyv** yan **jî bêje**.

Ji alîyê fonksîyonê ve peyv bi ser du grûpan ve cihê dibin:

**1) Navdêr**

**2) Lêker**

**Navdêr**, hemî hebûnên ku di dinyayê de yek bi yek yan grûp bi grûp hene nîşan didin. **Lêker** jî, hereketên wan nîşan didin.

Em dişên grûpên peyvan wisa rêz bikin:

**1) Navdêr**

**2) Rengdêr**

**3) Cihnav**

**4) Hoker**

**5) Daçek**

**6) Gihanek**

**7) Partîkel**

**8) Baneşan**

**9) Hejmarnav**

**10) Lêker**

Di beşên li pêşîya me em dê bi hûrbînî bala xwe bidin ser van grûpên peyvan.

## 3.1.AVANÎYA PEYVAN

Di kirdkî de jî eynî wek kurmancî, ji alîyê avanîyê ve peyv li ser du grûpan parve dibin:

**1) Peyvên Xwerû**

**2) Peyvên Hevedudanî**

**Peyvên xwerû**, ew in ku pêşqertaf yan paşqertaf negirtine û bi peyveka din ve nebestîyane.

Ji peyvên xwerû yên kirdkî çend nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| çim (n) | çav |
| dest (n) | dest |
| didan (n) | didan, diran |
| goş (n) | guh |
| lew (n) | lêv |
| por (n) | por |

**Peyvên hevedudanî** jî ew in ku pêşqertaf yan paşqertaf girtine yan jî bi peyveka din ve bestîyane û formeka nuh çêkirine. Ji peyvên hevedudanî çend nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **bêbextîye** (m) | **bêbextî** |
| **dar**nequr, -e | **dar**nequr |
| **goşare** (n) | **guhar** |
| **hakerûne** (m) | **hêkerûn** |
| **marmase** (n) | **mar**masî |
| **tuyêre** (m) | dar**tû** |

## 3.2.XUSÛSÎYETA PEYVÊN KIRDKÎ

Di kirdkî de hemî peyv yan **yekhejmar** yan **pirhejmar** in. Peyvên yekhejmar jî di nav xwe de li ser **nêrîtî** û **mêkîtîyê** parve dibin.

Helbet peyvên kurmancî jî nêr, mê û pirhejmar in. Lê ferqa kirdkî û kurmancî ev e ku, di kirdkî de peyv di halê xwerû de jî xususîyeta xwe nîşan dide. Lewma di nivîsînê de, bi taybetî di ferhengsazîyê de ji bo peyvên **pirhejmar** îşareta **(zh)**, ji bo peyvên **nêr** îşareta **(n)** û ji bo peyvên **mê** jî îşareta **(m)** dihê danîn ku taybetîya peyvê di halê xwerû yê peyvê de rast bihê zanîn.

Di kirdkî de zanîna taybetîya peyvê gelek muhîm e. Çunke taybetîya peyvê di her halî de hem tesîrê li ser cinsîyeta bireserê hem

jî li ser kişandina lêkerê dike. Ji bo qertafa ravekê jî rewş wisa ye. Heke meriv ji vê xususîyetê bêxeber be neşê kirdkî fêm bike yan qise bike.

Em peyva "**golik**" wek nimûne bigrin û bala xwe bidin ser taybetîya halên xwerû yên peyvê:

Heke yekhejmar be û nêr be, dibêjin "golik (n)".

Heke yekhejmar be û mê be, dibêjin "golike (m)".

Heke pirhejmar be, dibêjin "golikî (zh)".

Yanî:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| golik (n) | golik |
| golike (m) | golik |
| golikî (zh) | golik |

Herwekî ku dixuye, di kurmancî de her sê halên taybetîya navdêrê di halê xwerû de tenê bi awayekî ne. Lê di kirdkî de taybetîya her sê halên navdêrê, yanî *nêrîtî*, *mêkîtî* û *pirhejmarîya* peyvê di halê xwerû de dîyar e. Ev taybetî ji bo hemî peyvan wisa ye. Jixwe ferqa herî berçav ya di navbera kurmancî û kirdkî de ev e.

Em îcar rengdêrekê (**sor**) bidin ber navdêra "**golik**"î û nîşan bidin ku taybetîya navdêrê çawa şekil dide rengdêra xwe.

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| goliko sûr (n) | golikê sor |
| golika sûre (m) | golika sor |
| golikê sûrî (zh) | golikên sor |

Mîna ku dixuye, îcar rengdêr her sê halên navdêrê, yanî halê nêr, mê û pirhejmar yê peyvê nîşan dide. Lê di kurmancî de rengdêr tim wek xwe yanî di halê xwerû de maye, qertaf negirtiye.

Di halê xwerû de ji alîyê girtina qertafa ravekê ve jî ferqa kirdkî û kurmancî ev e:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| goliko sûr (n) | golikê sor |

| | |
|---|---|
| golika sûre (m) | golika sor |
| golikê sûrî (zh) | golikên sor |

Di halê tewandî (oblîk) de, ji alîyê girtina qertafa ravekê ve jî ferqa kirdkî û kurmancî ev e:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Golikê sûrî bibere. (n) | Golikê sor bibe. |
| Golika sûre bibere. (m) | Golika sor bibe. |
| Golikanê sûran bibere. (zh) | Golikên sor bibe. |

Neyînîya wê jî wisa çêdibe:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Golikê sûrî **me**bere. (n) | Golikê sor **me/ne**be. |
| Golika sûre **me**bere. (m) | Golika sor **me/ne**be. |
| Golikanê sûran **me**bere. (zh) | Golikên sor **me/ne**be. |

Em dê di beşa ravekê de (r. 115-118) cardin bala xwe bidin ser veqetandeka ravekê. Lê niha em lêkerekê daynin dawîya navdêr û rengdêrê (raveber û raveker) û hevoka xwe saz bikin û bibînin ku di kirdkî de taybetîya navdêrê yan jî rengdêrê çawa tesîr li kişandina lêkerê dike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Goliko sûr yeno. (n) | Golikê sor dihê. |
| Golika sûre yena. (m) | Golika sor dihê. |
| Golikê sûrî yenê. (zh) | Golikên sor dihên. |

Di kirdkî de cinsîyeta navdêrê tesîrê li kişandina lêkerê kiriye. Lê di kurmancî de tenê navdêra pirhejmar tesîrê li kişandina lêkerê kiriye.

Ji lêkera gerguhez di halê xwerû yê peyvê de nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| To goliko sûr berd. (n) | Te golikê sor bir. |

| | |
|---|---|
| To golika **sûre** berd**e**. (m) | Te golik**a** sor bir. |
| To golik**ê** s**ûrî** berd**î**. (zh) | Te golik**ên** sor bir**in**. |

Ji lêkera gerguhêz di halê tewandî yê peyvê de nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ti golik**ê** s**ûrî** bibere. (n) | Tu golik**ê** sor bibe. |
| Ti golik**a** s**ûre** bibere. (m) | Tu golik**a** sor bibe. |
| Ti golik**anê** s**ûran** bibere. (zh) | Tu golik**ên** sor bibe. |

## 3.3.PEYVÊN NÊR

Qayde yan formuleka sabît ku nêrîtî û mêkîtîya peyvan bi awayekê qethî dîyar bike tune ye. Lê di kirdkî de çiqas peyvên ku bi herfa bêdeng (consonant) diqedin, hemî nêr in. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| adir (n) | agir (n) |
| ber (n) | derî (n) |
| bext (n) | bext (n) |
| çem (n) | çem (n) |
| dat (n) /ap (n) | ap (n) / mam (n) |
| dês (n) / dîwar (n) | dîwar (n) |
| Dihok (n) | Dihok (m) |
| Dîyarbekir (n) | Dîyarbekir (m) |
| halîn (n) | hêlîn (m) |
| hewr (n) | ewr (n) |
| mîr (n) | hevîr (n) |
| Mûsil (n) | Mûsil (m) |
| namus (n) | namus (m) |
| nan (n) | nan (n) |
| nimaj (n) | nimêj (m) |
| por (n) | por (n m) |
| rez (n) | rez (n) |
| rûn (n) | rûn (n) |
| xal (n) | xal (n) (birayê dêya merivî) |

Di kirdkî de hinek peyv bi herfa bideng (vokal) diqedin lê dîsa jî nêr in. Mesela, peyvên wisa:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| bira (n) | bira (n) |
| ca (n) | cih (n) |
| ga (n) | ga (n) |
| va (n) | ba (n) |
| zama (n) | zava (n) |
| estare (n) | stêr (m) |
| hewte (n) | hefte (m) |
| gule (n) | gule (n) |
| goşare (n) | guhar (n) |
| goşe (n) | goşe (n) |
| rî (n) | rû (n) |
| do (n) | dew (n) |
| ko (n) | çiya (n) |
| ro (n) | robar (n) |
| dû (n) | dûxan (n) |

Dibe ku ji dawîya hinek peyvan deng ketibin. Mesela, beşek ji van peyvên nêr di farisî de wisa ne:

| Kirdkî | Kurmancî | Farisî |
|---|---|---|
| bira (n) | bira (n) | birader |
| ca (n) | cih (n) | cah |
| ga (n) | ga (n) | gav |
| va (n) | ba (n) | bad |
| zama (n) | zava (n) | damad |
| estare (n) | stêr (m) | sitareh |
| hewte (m) | hefte (m) | hefteh |
| gule (n) | gule (m) | goluleh |
| goşare (n) | guhar (n) | goşvareh |
| goşe (n) | goşe (n) | goşeh |
| rî (n) | rû (n)/rih (m) | çehrih |

| | | |
|---|---|---|
| do (n) | dew (n) | dox |
| ko (n) | çiya (n) | koh |
| ro (n) | robar (n) | rodxaneh |
| dû (n) | dûxan (n) | dûd |

Dibe ku windabûna dengan di gelek peyvên din de jî hebe. Bi taybetî dengê "**h**"yê hem ji pêşîya peyvê hem ji paşîya peyvê ketiye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **geh** > ge | geh |
| gew**h**er > gewer; cewer | gewher; cewher |
| **h**ameyîş > ameyîş | hatin |
| **h**amnan > amnan | havîn |
| **h**ende > ende | hewqas |
| **h**endî > endî; êdî | êdî |
| **h**engimên > engimên | hingivîn; hingiv |
| **h**engure > engure | tirî |
| **h**estiş > estiş | hebûn |
| **h**ewnîyayîş > ewnîyayîş | nihêrîn |
| **h**ênî > eynî | kanî; kehnî |
| **h**îne > îne | în |
| **h**ozan > ozan | hozan |
| veşarge**h** > şarge | veşargeh |
| ware**h** > ware | war |

Ger em vegerin ser mijara cinsîyeta peyvan, hinek dibêjin ji ber xususîyeta tiştan e ku peyv wek "nêr" yan "mê" hatine binavkirin. Dibe ku di kurmancî de ji bo beşeka bêjeyan ev wisa be. Lê di kirdkî de nêrîtî û mêkîtîya peyvan bêhtir ji taybetîya tiştan ji ber avanîya peyvê bi xwe ye. Mesela, di kurmancî de jî û di kirdkî de jî "dest" nêr e lê "pêçî; tilî" mê ye. Dîsa di kurmancî de ji organên nav singê me "kezeb" mê ye lê "dil" nêr e. Di kurmancî de meriv neşê vê taybetîyê îzeh bike ku çima "kezeb" mê û "dil" nêr e, yan çima "dest" nêr

e, "pêçî" mê ye. Lêbelê di kirdkî de ji ber ku peyvên mê bi herfa bideng (vokal) diqedin û peyvên nêr jî bi herfa bêdeng (konsonant) diqedin, ev xususîyet îzeh dibe.

## 3.4.PEYVÊN MÊ

Di kirdkî de peyvên mê di halê xwerû de qertafa "-**e**" digirin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| awe (m) | av (m) |
| bize (m) | bizin (m) |
| çale (m) | çal (m) |
| çûçike/mîrçike (m) | çûçik/çivîk (m) |
| dare (m) | dar (m) (dara hêşîn, ne darê hişk) |
| desmale (m) | desmal (m) |
| fincane (m) | fincan (m) |
| garane (m) | garan (m) |
| gole (m) | gol (m) |
| gule (m) | gul (m) |
| kevoke (m) | kevok (m) |
| mêwe (m) | mêw (m) |
| petêxe (m) | petêx (n) |
| roje (m) | roj (m) |
| saye (m) | sêv (m) |
| şewe (m) | şev (m) |
| tuyêre (m) | dartû (m) |

Peyvên xerîb yên ku bi herfa bêdeng diqedin û ketine kirdkî, heke mê bihên gotin, muheqeq dengê "-**e**" wek paşqertaf bi dawîya peyvê ve dizeliqe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** | |
|---|---|---|
| kamyone (m) | kamyon (m) | (îtl: camion) |
| otobuse (m) | otobus (m) | (alm: autobus) |
| salone (m) | salon (m) | (îng: salon) |

Ev paşqertafa "**-e**" ya dawîya peyvan di hinek devokên kirdkî de wek "i" dihê gotin, heta li hinek herêman jî hîç nayê gotin. Nimûne:

awe > awi > aw
Eyşe > Eyşi > Eyş
komele > komeli > komel
qeleme > qelemi > qelem

Di kirdkî de herçendî piranîya peyvên mê bi paşqertafa "**-e**"yê biqedin lê peyvine ku bi herfên bideng yên wek "**a**" û "**î**" jî diqedin jî hene. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| dinya (m) | dinya (m) |
| gonî (m) | xwîn (m) |
| kardî (m) | kêr (m) |
| kêna (m) | keç (m) |
| manga (m) | mange/çêlek (m) |
| mehkema (m) | mehkeme (m) |
| misasî (m) | misas (m) |
| rêşta (m) | teşî (m) |

Ji van hinek jê, mesela, peyvên "dinya" û "mehkema" ji erebî ketine nav kurdî lê yên din kurdî ne.

Li vir tiştê muhîm ev e ku, paşqertafa mêkîtîyê "**-e**" guherbar e, yanî dema ku navdêr paşqertafa ravekê bigire, ev paşqertaf (**-e**) winda dibe yan jî diçe dikeve pey rengdêrê. Lê ev herfên dengdêr "**a**" û "**î**" yên di dawîya peyvên mê de winda nabin, wek parçeyê eslî yê peyvê xwe diparêzin.

Em bala xwe bidin ser peyvên mê ku bi dengê "**-e**" diqedin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| awe (m): Awa hênîyî serdin a. | av (m): Ava kanîyê sar e. |
| Eyşe (m): Eyşa ma weşik a. | Eyşe (m): Eyşa me xweşik e. |
| qeleme (m): Qelema to tûj a. | qelem (m): Qelema te tûj e. |

Lê dema ku lêkera nîvco (kopula) negatîv be, paşqertafa mêkîtîye "-e" winda nabe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| qeleme (m): A qeleme nîya. | qelem (m): Ew qelem nîye. |

Îcar em bala xwe bidin ser peyvên ku bi herfên "a" û "î" diqedin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| kêna (m) | keç (m) |
| Kênaya xalê mi. | Keça xalê min. |
| manga (m) | mange (m) |
| Mangaya ma ameya. | Mangeya me hatiye. |
| rêşta (m) | teşî (m) |
| Aye rêştaya xo rişta. | Wê teşîya xwe rêsandîye. |
| gonî (m) | xwîn (m) |
| Gonîya ma tede rijîyaya. | Xwîna me tê de rijîyaye. |
| kardî (m) | kêr (m) |
| Bi kardîya kalanî hurdî kerd. | Bi kêra kalanî hûr kir. |
| misasî (m) | misas (m) |
| Misasîya xo girewte şi cite. | Misasa xwe girt û çû cotê. |

## 3.5.PEYVÊN PIRHEJMAR

Di kirdkî de peyvên pirhejmar di halê xwe yê xwerû de tim bi herfa "î" diqedin. Ji peyvên pirhejmar çend nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ardî (zh) | ar (?) |
| berşoyî (zh) | berşo (?) |
| danî (zh) | danû (?) |
| destikî (zh) | destik (?) |
| pantolî (zh) | pantol (?) |
| şelwalî (zh) | şelwal (?) |
| zimbêlî (zh) | simbêl (ph) |

Li vir divê bihê gotin ku di kurmancî de peyv tenê di halê tewandî

(oblîk) de dişê paşqertafa pirhejmarîyê "-**an**" bigire. Eynî wisa di kirdkî de jî peyv di halê tewandî de wek kurmancî paşqertafa pirhejmarîyê "-**an**" digre. Lê ji kurmancîyê cihêtir, di kirdkî de her peyvek di halê xwe yê xwerû de bi paşqertafa "-**î**" dişê bibe pirhejmar. Me di beşa "3.2" (r. 32) de behsa vê taybetîyê kiribû.

Ji halê xwerû nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| kurdî (zh) | kurd |
| Kurd**î** ameyî. | Kurd hat**in**. (halê xwerû) |
| Kurd**an** havilêk nêkerde! | Kurd**an** havilekê nekir! (halê tewandî) |

Di kirdkî de paşqertafa pirhejmarîyê "-**î**" wekî paşqertafa mêkîtîyê "-**e**"yê guherbar e; heke peyv nebe pirhejmar hewceyî bi paşqertafa pirhejmarîyê (-î) nîye.

Peyvên ku di halê xwe yê xwerû de jî pirhejmar in, ev herfa "**î**" ya ku li paşîya peyvên pirhejmar e, wek parçeyekê eslî ji peyvê ye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ardî (zh) | ar (?) |
| Ma ard**ê** xo arêye ra ardî. | Me ar**ê** xwe ji aşî anî[n]. |
| berşoy**î** (zh) | berşo (ph) |
| Berşoy**ê** Eyşe birîsmên **ê**. | Berşoy**ên** Eyşê birîsmî **ne**. |
| destikî (zh) | destik (ph) |
| Bi destik**an** taweyî bigîre. | Bi destik**an** taweyî bigre. |
| pantolî (zh) | pantol (ph) |
| Mi rê pantol**ê** sîyayî weş **ê**. | Ji min re pantol**ên** reş xweş **in**. |
| şelwal**î** (zh) | şelwal (ph) |
| Şelwal**ê** babîyê mi qumaş ê. | Şelwal**ên** bavê min qumaş **in**. |
| zimbêl**î** (zh) | simbêl (ph) |
| Camêrdî zimbêl**ê** xo taştê. | Camêrî simbêl**ên** xwe traş kirine. |

## 3.6.BIKARANÎNA PEYVAN

Di kirdkî de peyvên nêr yên ku bi herfa bideng diqedin, dema ku

qertaf digirin, di warê rastnivîsînê de divê hemî dengên xwe muhafeze bikin. Em ji peyvên ku bi herfa bideng diqedin çend nimûne bidin:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| bira (n) | bira (n) |
| Biratî bî baran hesab bi mîsqalan! | Biratî bi baran hesab bi mîsqalan! |
| ca (n) | cih (n) |
| Cayo germin ra qisey keno! | Ji cihê germ qise dike! |
| estare (n) | stêr (m)/stêrk (m) |
| Estareyê ey rijîya! | Stêra/stêrka wî rijîya! |
| gule (n) | gule (m) |
| Guleyê ey gina ma ro! | Guleya wî li me ket! |
| name (n) | nav (n) |
| Nameyê aye Roşna ya. | Navê wê Roşna ye. |
| rî (n) | rû (n) |
| Homa rîyê merdimî sîya nêkero! | Xwedê rûyê merivî reş neke! |
| roje (n) | rojî (m) |
| Rojeyê remezanî de roje gêno. | Di rojîya remezanê de rojiyê digire. |
| vile/vîye (n): | stû (n) |
| Vileyê/vîyeyê ey qalind o! | Stûyê wî qalin e! |
| zama (n) | zava (n) |
| Zamayo teze yo. | Zavayê teze ye. |

Di kirdkî de jî eynî wek kurmancî, bi taybetî di zimanê qisekirinê de, dengên dawîn yên peyvên nêr winda dikin. Lê di zimanê nivîskî de divê nekin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Xelet**: Birê mi ame | Birê min hat. |
| **Rast**: Birayê mi ame. | Birayê min hat. |
| | |
| **Xelet**: Cê ma teng o. | |
| **Rast**: Cayê ma teng o. | Cihê me teng e. |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Xelet**: Gulê tifingî gina piro. | Gula tifingê lê ket. |
| **Rast**: Guleyê tifingî gina piro. | Guleya tifingê lê ket. |
| **Xelet**: Namê aye çi yo? | |
| **Rast**: Nameyê aye çi yo? | Navê wê çi ye? |
| **Xelet**: Rojê remezanî ame. | |
| **Rast**: Rojeyê remezanî ame. | Rojîya remezanê hat. |
| **Xelet**: Vilê/vîyê ey qalind o. | |
| **Rast**: Vileyê/vîyeyê ey qalind o! | Stûyê wî qalind e! |
| **Xelet**: Zamê ma ameyo. | Zavê me hatîye. |
| **Rast**: Zamayê ma ameyo. | Zavayê me hatiye. |

Lê peyvên mê yên ku bi paşqertafa mêkîtîyê "**-e**" diqedin, dema ku qertaf digirin, di hin halan de ev deng winda dibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| waye (m) | xwişk (m) |
| A way a, o zî bira yo. | Ew xwişk e, ew jî bira ye. |
| gule (m) | gul (m) |
| Gulê baxçeyî heme sûr ê. | Gulên baxçeyî hemî sor in. |
| vile (m) | kulîlk (m) |
| Xebera weşe vila zebeşe. | Xebera xweş kulîlka zebeşê. |
| Eyşane (m) | Eyşan (m) |
| Deyîra Eyşana Elî weş a. | Strana Eşyana Elî xweş e. |
| roje (m) | roj (m) |
| Roja çarine vejîya ame. | Roja çaran derket hat. |
| dare (m) | dar (m) |
| Dara derge qewaxêr a. | Dara dirêj spîndar e. |
| engure (m) | tirî (n) |
| Ez engura sîyaye ra hes kena. | Ez ji tirîyê reş hez dikim. |

Peyvên mê yên ku bi dengê "a" diqedin, heke qertaf bigirin jî, di zimanê nivîskî de hertim herfa xwe ya dawîn ya dengdêr (vokal) diparêzin.

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Xelet**: Dinya ma teng a. | Dinya me teng e. |
| **Rast**: Dinyaya ma teng a. | Dinyaya me teng e. |
| **Xelet**: Kêna xalê mi rindek a. | |
| **Rast**: Kênaya xalê mi rindek a. | Keça xalê min rind e. |
| **Xelet**: Manga bore çerena. | Manga bor diçêre. |
| **Rast**: Mangaya bore çerena. | Mangeya bor diçêre. |
| **Xelet**: Mehkema Heqanê Merdiman | Mehkema Heqên Merivan |
| **Rast**: Mehkemaya Heqanê Merdiman | Mehkemeya Heqên Merivan |
| **Xelet**: Rojda rindeke ha yena. | Rojda rind wa dihê. |
| **Rast**: Rojdaya rindeke ha yena. | Rojdaya rind wa dihê. |

Herwekî ku ji nimûneyan jî dixuye, di kurmancî de jî peyvên ku bi herfa "a" diqedin, dema ku qertafa ravekê "-a" digirin, ji ber ku du bidengên wek hev dihên ber hev gelekê caran yek jê winda dibe. Divê winda nebe, herfa kelijandinê bikeve nava her du dengdêran û peyv forma xwe biparêze.

Peyvên mê yên ku bi dengê "î" diqedin dema ku qertaf digirin divê ew jî vî dengî winda nekin, yanî forma xwe ya halê xwerû muhafeze bikin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Xelet**: Bi karda kalanî hurdî kerd. | |
| **Rast**: Bi kardîya kalanî hurdî kerd. | Bi kêra kalanî hûr kir. |
| **Xelet**: Misasa derge girewte ame. | |
| **Rast**: Misasîya derge girewte ame. | Misasa dirêj girt hat. |

**Xelet**: Mişewşa şore da ma.
**Rast**: Mişewşîya şore da ma. Şorbenîska şor da me.
**Xelet**: Bi vaştura tûje paleyî keno.
**Rast**: Bi vaşturîya tûje paleyî keno. Bi dasa tûj paleyîyê dike.

Lêbelê peyvên pirhejmar, dixwazî ji koka xwe bi "î" biqedin dixwazî bila paşqertafa pirhejmarîyê "-î" bigirin, dema ku qertaf digirin, "î"yê dawîya peyvê winda dibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ardî (zf): | ar (n) |
| Aye ardê xo vitê. | Wê arê xwe bêtiye[ine?]. |
| destikî (zh) | destik (ph) |
| Destikê renginî çi weşik ê! | Destikên rengîn çi xweşik in! |
| şelwalî (zh) | şelwal (n) |
| Şelwalê sîyayî kerdê xo payî. | Şelwalên reş kirine pîyên xwe. |
| zimbêlî (zh) | simbêl (ph) |
| Ma ê zî zimbêl ê! | Ma ew jî simbêl in! |

Lêbelê dema ku peyvên mê yên ku bi dengê "**e**" diqedin û peyvên pirhejmar ku bi dengê "**î**" diqedin, di lêkera nîvco (kopula) ya negatîv de herfa xwe ya dengdêr ya dawîyê winda nakin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| waye (m) | xwişk (m) |
| A way a. A waye nîya. | Ew xwişk e. Ew xwişk nîye. |
| gule (m) | gul (m) |
| A gul a. A gule nîya. | Ew gul e. Ew gul nîye. |
| vile (m) | kulîlk (m): |
| A vil a. A vile nîya | Ew kulîlk e. Ew kulîlk nîye. |
| Eyşane (m) | Eyşan (m) |
| A Eyşan a. A Eyşane nîya. | Ew Eyşan e. Ew Eyşan nîye. |
| dare (m) | dar (m) |
| A dar a. A dare nîya. | Ew dar e. Ew dar nîye.) |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| ardî (zf) | ar (?) |
| Ê ard ê. Ê ardî nîyê. | Ew ar in. Ew ar nînin. |
| destikî (zh) | destik (ph) |
| Ê destik ê. Ê destikî nîyê. | Ew destik in. Ew destik nînin. |
| şelwalî (zh) | şelwal (ph) |
| Ê şelwal ê. Ê şelwalî nîyê. | Ew şelwal in. Ew şelwal nînin. |
| zimbêlî (zh) | simbêl (ph) |
| Ê zimbêl ê. Ê zimbêlî nîyê! | Ew simbêl in. Ew simbêl nînin. |

## 3.7.TELEFIZA PEYVAN

Di her zimanî de telefiza peyvan gelek muhîm e. Helbet di zaravayên kurdî yên din de jî muhîm e. Lê di kirdkî de telefiza peyvan muhîmtir e. Çunke di kirdkî de peyvine hene ku forma wan yek e, lê yek nêr ya din mê ye. Yan jî peyv heye ku di eynî formî de hem pirhejmar hem jî aîdîyetê dinimîne. Lewre di dengderxistinê de yanî di bilivêkirinê/telefizê de divê peyv rast bihên gotin ku rast fêm bibin. Mesela, peyvên mîna:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **gule** (m) | gul (m) |
| **gule** (n) | gule (m) |
| **roje** (m) | roj (m) |
| **roje** (n) | rojî (m) |
| **veyve** (m) | bûk (m) |
| **veyve** (n) | dawet (m) |
| **vile** (m) | kulîlk (m) |
| **vile** (n) | stû (n) |

Di telefiza peyvên mê yên kirdkî de hertim giranî li ser kîteya pêşîn e. Di telefiza peyvên nêr de jî hertim giranî li ser kîteya dawîn e.

Di telefiza peyvên pirhejmar de jî eynî wek peyvên mê, hertim giranî li ser kîte yan kîteyên pêşîn e. Nimûne:

Osmanî: yanî tişt yan kesê ku aîdê Osmanî ye
Osmanî: ji yekî zêdetir Osman
kafirî: yanî wek kafiran, bi awayê kafiran; kafirkî
kafirî: ji yekî zêdetir kafir
azadî (m): yanî hurîyet
Azadî: ji yekî zêdetir Azad
hesenî: cinsê ku hesenî ye, wek petêxa hesenî yan tirîyê hesenî
Hesenî: ji yekî zêdetir Hesen

Dema ku peyvên nêr di halê tewandî de qertafa "-î" digirin jî cardin wek telefiza peyvên mê û pirhejmar giranî diçe ser kîte yan kîteyên pêşîn. Nimûne:

**Kirdkî**: Min û Hesenî ma petêxa hesenî werde.

**Kurmancî**: Min û Hesenî me petêxa hesenî xwar.

### 3.8.PEYVÊN BIYANÎ

Peyvên ku ji zimanên xerîb ketine kirdkî, di zimanê nivîskî de heta ku mumkin e divê nêzîkî eslê xwe bihên gotin û nivîsîn. Çunke di kirdkî de ji alîyê devokên cihê bi cihê ve peyv dihên deformekirin. Nimûne:

| Rast | Xelet |
|---|---|
| **camî** (er): camî (m) | comî, cûmî, cumî |
| **critère** (fr.): krîter (n) | qrîter, kirîter |
| **oda** (tr): oda (m) | wede, wedi, wuda |
| **radio** (îng): radyo (n) | rado, radon, radûn |
| **şubhe** (er): şubhe (n) | şuphe, şibe, şife |
| **television** (îng): televîzyon (n) | televîzon, televzon |
| **teşekkur** (er): teşekur | teşekkur |

## HUZNA

. . . .

Teber a şilî ya. Asmên pîzeyo safî ra bermeno. Çemê Qilboxî ginayo piro, xule-xule kewta ser. Dara çinêyere binê varanî de nefesê xo girewto, bêveng vinderta. Kema dirrike xo pilusnayo pêro. Û Silê Salîyo ke nêkeno bi selêka silî, ti vanî kutiko awî yo, gerrin, keçel. Kutikê hewt dewan rîyê ey bilêsê xo rê mird benê. Dindanî fek de kurisîyayê, kermejinî. Boya mirdarî fek ra yena. Qeşmerê dewan emşo kewto vernî û rêçe çarneno, sey luyan!

Şewe nîme ra vîyarta. Mêrdekê ke zimbêlê înan sey dimê merreyan û çimê înan sey kunîya goçînan, qefle bi qefle ameyê. Sere ra heta bi lingan mîyanê rextanê fişekan de xemelîyayî. Û dor û verê dewe heme qefilîya!

Zere de, dor û verê kuçike de xortî cematkî ronişţê. Tifingî verardkî nayê çokan ser. Rincan. Qapaxê çiman bîyê giran; venijyenê. Kuçike de adirî wele girewta. Hewnê Huzna remayo, çeleng-çeleng çerixîyena.

Mêmanî mêmanê Homayî yê. Û delîl dayê to bo Huznayê!

Mêmanî gunek ê! Adirê kuçike şîyo hewn a.

Huzna berê teberî nermek kerd a, derzeyê birranê verkî ra girzeyêk birrî nayî xo kiftan ser.

Aaa! A game bî. Dinya nêgêraye, zeman vindert!

Engiştî linganê tifingan ser o, engiştî bêbext!

Û şîrqînî, û şîrqînî... Şîrqînî ginaye tifingan ro!

Virsik virisa, virsik!

Huzna! Huznaaa! Huzna qelibîya!

Yew gilê dara çinêyere bin ra qelêya!

Vengê tifingan heta verardanê koyê Şaxorî olan da!*

*Roşan Lezgîn, Binê Dara Valêre de, Çapa hîrêyine, Weşanxaneyê Roşna, Dîyarbekir, 2012, r. 11-12

# HUZNA

...

Li derve şilî ye. Ezman ji dilê safî digrî. Çemê Qilboxê lêketiye; xulexul jê tê. Dara çinarê di bin baranê de nefesa xwe girtiye. Bêdeng. Kemên dirîreşkan xwe li hev pêçane. Û Siloyê Salo ku nake bi selekeka sergînê; segê avî, gerro û gurrî. Segên heft gundan rûyê wî bialêsin jê têr dibin. Diran di dev de kurisîne; kurmî. Bêhna mirarê ji dev tê. Qeşmerê gundan îşev daye pêşî û rêçê digerine mîna roviyan!

Şev ji nîvî bihuriye. Zilamên ku simbêlên wan mîna dûvê mişkan û çavên wan mîna kunên şûjinan, qefle bi qefle hatine. Ji serî heta binî di nav çek û rextan de. Û seranser dor li gund hate girtin.

Li hundir, li dora argûnê xort çarmêrkî rûniştî ne. Çekên wan li ser çokan. Bêxew, westiyayî... Qapaxên çavan giran; divenijin. Agirê argûnê xwelî girtiye.

Xew li Huznayê herimiye, çeleng çeleng diçerixe.

Mêvan mêvanê Xwedê ne. Û delîl dayka te be Huznayê!

Mêvan gune ne! Agir li argûnê vemiriye.

Huznayê deriyê derve bi fesal vekir. Li ber derî, ji koma percînan gurzek hilanî...

Aaa!.. Ew gav bû! Dinya negeriya, zeman rawest!

Tilî li ser tetikan û tilî bêbext!

Û şîrqînî, û şîrqînî... Şîrqînî bi ser çekan ket!

Birûsk, birûsk... Birûskê lê da!.. da!.. da!..

Axxx!..

Huzna! Huzna! Huznaaaa!... Huzna qelibî!

Guliyekî dara çinarê ji binî ve qeliya!

Dengê tifingan heta berpalên çiyayê Şaxorî olan dan!*

*Roşan Lezgîn, Li Bin Dara Bîyê Weşanên Elma, Îstanbul 2003, r.11 12

# 4.NAVDÊR

Peyvên ku tiştan yek bi yek yan jî cins bi cins didin naskirin, dîsa term, hîs, fikr, rewş yan jî têkilîya wan ya bi hev re nîşan didin re dibêjin **navdêr**. Yanî dixwazî şênber yan razber, her tiştê ku di kaînatê de heye, bi navdêrekî dihê binavkirin.

Du tewir navdêr hene:

**1) Navdêrên Taybet**

**2) Navdêrên Cinsî**

**Navdêrên taybet**, navê tiştan e ku tek in, ji yekî zêdetir tune ne. Di kirdkî de jî eynî wek kurmancî navdêrên taybet hertim bi herfa gir dihên nivîsîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Dêrsim | Dêrsim |
| Dîyarbekir | Dîyarbekir |
| Ehmedê Xasî | Ehmadê Xasî |
| Licê | Licê |
| Qazî Mehemed | Qazî Mihemed |

**Navdêrên cinsî** jî navê wan tiştan e ku ji yekî zêdetir yan jî grûp in. Navdêrên cinsî di nav hevokê de hertim bi herfa piçûk dihên nivîsîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| dare (m) | dar |
| çem (n) | çem |
| ko (n) | çiya |
| kurd, -e | kurd |
| merdim, -e | meriv |

| | |
|---|---|
| qeleme (m) | qelem |
| zeytûne (m) | zeytûn |

Di kurmancî de navê şêngehan û cihan mê ne. Mesela, ger "**Botan**" navê camêran be, nêr e. Lê dema ku navê cihekî be, mê ye. Ev qayîde di kirdkî de tune ye. Çawa ku di beşa peyvan de jî behsa wê hat kirin (r. 37-38), di kirdkî de nêrîtî û mêkîtîya navdêran li gor avanîya peyvê ye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Bidlîs (n) | Bidlîs (m) |
| Çewlîg (n) | Çewlîg (m) |
| Dêrsim (n) | Dêrsim (m) |
| Dîyarbekir (n) | Dîyarbekir (m) |
| Riha (m) | Riha (m) |
| Silêmanî (m) | Silêmanî (m) |

Di kurmancî de ji ber ku di halê xwerû yê peyvê de taybetîya peyvê dîyar nîye, heta ku di nav hevokê de neyê bikaranîn meriv cinsîyeta peyvê tênagihê. Mesela, dema ku peyva "**Botan**" di halê xwerû de be, meriv tênagihê ku gelo nêr yan mê ye; yanî dîyar nîye ku navê herêmê yan navê camêr e.

Dîsa, di kurmancî de du manayên peyva "**dar**" hene: 1.dar**ê** hişk ku wek navdêr nêr e û 2.dar**a** ku hîn nebat e û wek navdêr mê ye.

Îcar di kirdkî de ji ber ku navdêrên mê di halê xwerû yê peyvê de paşqertafa "**-e**" û navdêrên pirhejmar jî paşqertafa "**-î**" digirin, lewma peyv di halê xwerû de jî taybetîya xwe nîşan dide. Nimûne:

dar (n): dar**ê** hişk ku wek navdêr nêr e

dar**e** (m): dar**a** ku hîn nebat e û wek navdêr mê ye

dar**î** (zh): ji yekî zêdetir darên terr yan darên hişk

xal (n): xal, birayê dêya merivî

xal**e** (m): xalet, xaltî, xwişka dêya merivî

xal**î** (zh): ji yekî zêdetir bira yan xwişkên dêya merivî

## 4.1.HALÊ NAVDÊRAN

Di kirdkî de gava ku navdêr di nav hevokê de dihên bikaranîn bi alîkarîya paşqertaf, edat û guherîna cihê lêkerê halê navdêran çêdibe.

### 4.1.1.HALÊ XWERÛ YÊ NAVDÊRAN

Di kirdkî de halê xwerû yê navdêran wek kirdeya hevokê di dema niha û dema bê de dihê bikaranîn. Di van deman de nêvdêr paşqertafê nagirin. Navdêrên pirhejmar paşqertafa halê xwerû "**-î**" digirin. Nimûne:

***Dema niha***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed nan weno. | Ehmed nanî/nên dixwe. |
| Zelale nan wena. | Zelal nanî dixwe. |
| Wendekar**î** nan wenê. | Xwendekar nanî dixw**in**. |

***Dema bê***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed do nan biwero. (n) | Ehmed dê nanî bixwe. (n) |
| Zelale do nan biwera. (m) | Zelal dê nanî bixwe. (m) |
| Wendekar**î** do nan biwerê. (zh) | Xwendekar dê nanî bixw**in**. (ph) |

### 4.1.2.HALÊ TEWANDÎ YÊ NAVDÊRAN

Di kirdkî de kirde di demên borî de tewandî bireser netewandî ne. Navdêrên nêr di halê tewandî de paşqertafa "**-î**" digirin. Navdêrên mê di her halî de paşqertafa mêkîtîyê "**-e**" muhafeze dikin. Navdêrên pirhejmar jî di halê tewandî de paşqertafa pirhejmarîyê "**-an**" digirin. Nimûne:

***Dema borî ya dîyar***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed**î** nan werd. (n) | Ehmed**î** nan xwar. (n) |
| Zelale nan werd. (m) | Zelal**ê** nan xwar. (m) |
| Wendekar**an** nan werd. (zh) | Xwendekar**an** nan xwar. (ph) |

*Dema borî ya nedîyar*

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmedî nan werdo. (n) | Ehmedî nan xwariye. (n) |
| Zelale nan werdo. (m) | Zelalê nan xwariye. (m) |
| Wendekaran nan werdo. (ph) | Xwendekaran nan xwariye. (ph) |

*Çîrokîya dema borî*

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmedî nan werdbi. (n) | Ehmedî nan xwaribû. (n) |
| Zelale nan werdbi. (m) | Zelalê nan xwaribû. (m) |
| Wendekaran nan werdbi. (zh) | Xwendekaran nan xwaribû. (m) |

*Çîrokîya dema niha*

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmedî nan werdêne. (n) | Ehmedî nan dixwar. (n) |
| Zelale nan werdêne. (m) | Zelalê nan dixwar. (m) |
| Wendekaran nan werdêne. (zh) | Xwendekaran nan dixwar. (ph) |

*Çîrokîya dema bê*

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmedî do nan biwerdêne. (n) | Ehmedî dê nan bixwara. (n) |
| Zelale do nan biwerdêne. (m) | Zelalê do nan bixwara. (m) |
| Wendekaran do nan biwerdêne. (zh) | Wendekaran dê nan bixwara. (zh) |

## 4.2.BI PAŞQERTAFÊ ÇÊBÛNA HALÎ

Di kirdkî de tenê di navdêrên nêr yên dîyarkirî de bi paşqertafa "-î" halê îşaretî çêdibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez kamcînî bidî kamî? | Ez kîjanî bidim kê? |
| Qeleme bide Ehmedî. (n) | Qelemê bide Ehmedî. (n) |
| Kitabî bide Zelale. (m) | Kitêbê bide Zelalê. (m) |

## 4.3.BI DAÇEKÊ ÇÊBÛNA HALÎ

Di kirdkî de daçekên ku halê navdêran çêdikin "**bi**", "**ra**" û "**rê**" ne.

**a)** Bi daçeka "**bi**" çêbûna halê navdêran:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez şina **bi** Dîyarbekir. | Ez diçim [**bi**] Dîyarbekirê. |
| Ti eşkenî **bi** ey? | Tu dişêyî **bi** wî? |
| **Bi** min bo, ma roşenê. | **Bi** min be, em difiroşin. |

**b)** Bi daçeka "**ra**" çêbûna halê navdêran:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez kamî **ra** vana? | Ez **ji** kê **re** dibêjim? |
| Ez Roşna **ra** vana. | Ez **ji** Roşnayê **re** dibêjim. |
| Ez Roşna **ra** gêna. | Ez **ji** Roşnayê digirim/distînim. |
| Ez Roşna **ra** hes kena. | Ez **ji** Roşnayê hez dikim. |

**c)** Bi daçeka "**rê**" çêbûna halê navdêran:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez kamî **rê** vana? | Ez **ji** kê **re** dibêjim? |
| Ez Roşanî **rê** vana. | Ez **ji** Roşanî **re** dibêjim. |
| Ez naye Roşna **rê** nêverdena! | Ez vîya **ji** Roşnayê **re** nahêlim! |
| Ti Roşna **rê** vanî? | Tu **ji** Roşnayê **re** dibêjî? |

## 4.4.BI GUHERÎNA CIHÊ PÊVEBERÊ ÇÊBÛNA HALÎ

Di kirdkî de bi guhertina cihê pêveberê halê navdêran diguhere û mana ji hev cihê dibin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ti se **kenî** bi ey? | Tu çi **dikî** bi wî? |
| Ti bi ey se **kenî**? | Tu bi wî çi **dikî**? |
| **Bike** dare ra. | **Bike** di darê re. |
| Dare ra **bike**. | Ji darê **bike**. |
| Ez **şina** [bi] Licê. | Ez **diçim** [bi] Licê. |
| Ez Licê ra **yena**. | Ez ji Licê **dihêm**. |

| | |
|---|---|
| Ez Dîyarbekir ra **ewnîyena**. | Ez **ji** Dîyarbekir dinihêrim. |
| Ez **ewnîyena** Dîyarbekir ra. | Ez **li** Dîyarbekir dinihêrim |

### 4.5.PAŞQERTAFA TEWANDINA NAVDÊRAN

Di kirdkî de tenê navdêrên nêr di halê ravekê de paşqertafa tewandinê digirin, ev jî bi paşqertafa "-î" çêdibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Keyeyê Azadî nêzdîyê ma yo. | Mala Azadî/Azêd nêzîkî me ye. |
| Keyeyê Zelale ma ra dûrî yo. | Mala Zelalê ji me dûr e. |

Di kirdkî de navê merivan yên nêr hem di rewşa dîyar de hem di ya ne dîyar de tim paşqertafa tewandinê "-î" digire. Lê navê tiştan tenê di rewşa dîyar de vê paşqertafê digire. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez Dêrsim ra hes kena. | Ez ji Dêrsimê hez dikim. (Navê bajarî) |
| Ez Dêrsimî ra hes kena. | Ez ji Dêrsimî hez dikim. (Navê camêrî) |
| Ez ewnîyena Xelat ra. | Ez li Xelatê dinihêrim. (Navê bajarî) |
| Ez ewnîyena Xelatî ra. | Ez li Xelatî dinihêrim. (Navê camêrî) |
| Ma Kurdistan ra yê. | Em ji Kurdistanê ne. (Navê welatî) |
| Ma heme Ademî ra yê. | Em hemî ji Ademî ne. (Navê merivî) |

Navê tiştan di rewşa nedîyar de paşqertafê nagire. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed goşt roşeno. (nedîyar) | Ehmed goşt difiroşe. |
| Azad zî genim roşeno. (nedîyar) | Azad jî genim difiroşe. |

Lê di rewşa dîyar de navê tiştan yên nêr paşqertafa "-î" digirin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed goştî roşeno. (dîyar) | Ehmed goştî difiroşe. |
| Azad jî genimî roşeno. (dîyar) | Azad jî genimî difiroşe. |

Li hinek herêman, kurmanc di navdêrên nêr de paşqertafa tewangê bi kar naînin.

## BINÊ DARA VALÊRE DE

Hemeyê dewijanê ke yaban ra, mîyanê hêgayan de paleyîye kerdêne, germî ver remayêne ameyênê keye. Badê ke bi nan û do kalekî şidênayêne, bi çimanê wexerîyayan eywananê honikan de kewtêne verara hewnêkê xorînî, heta ke qîyale şikîyayêne. Xora erdî dewe ra nêzdî bî. Her parçe qilçikêk. Teber a şiwaneyan bolê pesî vera dayêne fekê çeman, binê çinêyeran de mexel kerdêne. Heme heywanê kovî, teyr û tuyûrî hewnê mîyanrojî de bîyî. Dinya, tena germî rê mendêne.

Ez nêzana ke reyna mi çi suc kerdbi, çi weqîet dabi ke dadîya mi binê goşan ro mi kerdbi sûr û ez werdişê mîyanrojî ra mehrûm mendbîya. Ez kewta verûverê çemî, acêr şîya, heta ke ez resaya binê baxçeyê Gola Sipîye. Teber a germî ver erdî leylan dayêne. Serê daran de çirre-çirra çirçileyan û kêzikan bî. Semedo ke awa Gola Sipî zaf zelal a û binê aye zî seraser yan helan o yan zî xîzo pak o û beriqîyeno, uca ra vanê Gola Sipî. Cayo tewr xorîn qasê qamêka camêrdan o. Beno ke pancas metreyî dergî û des metreyî verinîya gole bî. Weverê Gola Sipî de zinarêko zaf xişn, yekpare kerre bi. Nê zinarê berzî, sey şîlê penêrîyo ke yewî bi kardî ci ra kerdo, tim gole binê versîya xo de verdayêne. Naver de zî tena baxçe bi. Baxçeyê Ap Wusî. Baxçe zî hema baxçe yo ha! Eynî yew kuncikê cennetî. Ti dara kam fêkî mirad bikerî Ap Wusî tede karita. Încasî deresabî. Ap Wusî darê digoşî şanaybî binê gilê încasêranê nazikan yê ke nêşenayêne binê barê xo de pay ra vinderê. Încasêrî sey kênekanê dewijanê balixbîyayan, bi rengê încasanê erxewanîyan û pelanê keweyan xemelnayeyî bî." (*)

*Roşan Lezgîn, Binê Dara Valêre de, Çapa hîrêyine, Weşanxaneyê Roşna, Dîyarbekir, 2012, r. 30-31

## LI BIN DARA BÎYÊ

Hemû gundîyên ku li çolê di nav zevîyan de paleyîyê dikirin, ji ber germê direviyan dihatin malê. Piştî ku bi nan û dew kêlek dijidandin, bi çavên xewirandî di wan eywanên hênik de diketin hembêza xeweke kûr, heta ku qîyale dişikîya. Jixwe zevî nêzîkê gund bûn; her parçe qilçikekê. Li derve şivanan kerîyên pezî berdidan devê çeman, di bin dareçinaran de mexel dikirin. Hemû heywanên kûvî, teyr û tuyûr di xewa navrojê de bûn. Dinya, tenê ji germahîyê re dima.

Ez nizanim ku dîsa min çi sûc kiribû, çi weqîet dabû ku diya min binê guhan li min sor kiribû û ez ji xwarina navrojê jî mehrûm mabûm. Ez ketim ber û berê çemî, berjêr çûm, heta ku giham binê bexçeyê Gola Sipî. Li derve ji ber germahîyê erdî leylan dida. Li ser daran çirre-çirra çirçileyan û kêzikan bû. Ji ber ku ava Gola Sipî zaf zelal e û binê wê jî seranser yan helan e yan jî xîza paqij e û dibiriqe, ji wir re dibêjin Gola Sipî. Cihê herî kûr bi qasî qama zilaman e. Dibe ku pêncî metre dirêj û deh metre jî berahiya golê be. Li jeberê Gola Sipî zinarekê zaf mezin, yekpare kevir bû. Vî zinarê bilind, wek şîla penîrî yê ku yekî bi kêrê jê kiribe, tim golê di bin sîya xwe de dihişt. Li vî alîyî jî tenê baxçe bû. Bexçeyê Apê Wuso. Bexçe jî hema bexçe ye ha! Eynî kuncikekê cenetê. Tu dara kîjan fêkîyê mirad bikî Apê Wuso tê de çandîye. Încas gihabûn. Apê Wuso darên diguh spartibûn binê gulîyên dareîncasên nazik yên ku nedişîyan di binê barê xwe de li pîyan bisekinin. Dareîncas wek keçikên gundî yên balixbûyî bi rengê încasên erxewanî û pelên kesk xebilandî bûn.(*)

*Roşan Lezgîn, Li Bin Dara Bîyê, Weşanên Elma, Îstanbul 2003, r. 30-31

# 5.RENGDÊR

Peyvên ku ji alîyê reng, rewş, hereket, şekil, cih, mana, îşaret, hejmar û pirsê ve navdêran temam dikin; yanî peyvên ku navdêran ji alîyê çendinî û çawanîyê ve rave dikin û wesfên wan nîşan didin re dibêjin **rengdêr**.

Rengdêr dema ku bi tena serê xwe bihên nivîsîn ew jî navdêr in. Lê çi dema ku bi navdêrekê re bihên nivîsîn û bibin ravekên navdêrê, wê demê dibin rengdêr.

Ji rengdêrên kirdkî çend nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ezeb, -e | ezeb |
| gird, -e | gir |
| jêhatî, -ye | jêhatî |
| sûr, -e | sor |
| tenik, -e | tenik |
| zaf, -e | zaf; pirr |

Herçiqas koka peyvên kirdkî û kurmanckî yek be jî hawayê nivîsîna wan cihê ye. Ji bo ku di kirdkî de peyv di halê xwe yê xwerû de jî cinsîyeta xwe nîşan dide, lewre rengdêr dişê hem "nêr" hem "mê" be. Mesela, rengdêra "ezeb" di kirdkî de, li halê xwe yê xwerû dişê hem nêrîtîya xwe wek forma "ezeb (n)" nîşan bide, hem jî dişê mêkîtîya xwe wek forma "ezebe (m)" nîşan bide. Lewre di ferhengê de bi awayê "ezeb, -e" dihê nivîsîn.

Di kirdkî de rengdêr jî eynî wek navdêran du tewir in:

**1) Rengdêrên Xwerû**

**2) Rengdêrên Hevedudanî**

**Rengdêrên xwerû**, ew peyv in ku pêşqertaf yan paşqertaf negirtine û bi peyveka din ve nehatine bestin.

Çend nimûne ji rengdêrên xwerû:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| baş, -e | baş |
| berz, -e | bilind |
| derg, -e | dirêj |
| kilm, -e | kin |
| nizm, -e | nizm |
| rind, -e | rind |
| weş, -e | xweş |
| zerd, -e | zer |

**Rengdêrên hevedudanî** jî ew peyv in ku bi pêşqertaf, paşqertaf yan jî bi peyveka din ve bestîyane û formeka nuh çêkirine, bûne xwedîyê manayeka din. Çend nimûne ji rengdêrên hevedudanî:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **bê**bext, -e | **bê**bext |
| **kêm**aqil, -e | **kêm**aqil |
| kilm**ek**, -e | kin**ik** |
| **nê**weş, -e | **ne**xweş |
| sipî**çol***ik*, -e | spî**çol***ik* |
| zerd**ik**, -e | zer**ik** |

### 5.1.RENGDÊR JI ALÎYÊ NÊRÎTÎ, MÊKÎTÎ Û PIRHEJMARÎYÊ VE

Di kirdkî de rengdêr li gor raveberê dibin nêr, mê û pirhejmar. Rengdêrên ku navdêrên nêr rave dikin di halê xwerû de paşqertaf nagrin. Rengdêrên mê hertim paşqertafa mêkîtîyê "**-e**" û rengdêrên pirhejmar jî di halê xwerû de paşqertafa pirhejmarîyê ya halê xwerû "**-î**" digirin, di halê tewandî de jî paşqertafa "**-an**"ê digirin. Em navdêrên "**dar** (n)", "**dare** (m)" û "**darî** (ph)" bi rengdêra "**derg**, **-e**

(dirêj)" rave bikin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| dar (n): daro derg | dar: darê dirêj |
| dare (m): dara derge | dar: dara dirêj |
| darî (zh): darê dergî | dar: darên dirêj |

Mîna ku dixuye, di kirdkî de rengdêrê rewşa navdêrê ji alîyê cinsî û pirhejmarîyê ve temam kiriye lê di kurmancî de li her sê halan jî rengdêrê cinsîyet û pirhejmarîya xwe nîşan nedaye. Meriv ancax ji paşqertafa ravekê têdigihê ku kîjan navdêr nêr, kîjan mê û kîjan pirhejmar e. Helbet di kirdkî de jî eynî wek kurmancî nêrîtî, mêkîtî û pirhejmarîya navdêrê ji paşqertafa ravekê dixuye lê di kirdkî de ji kurmancî cihêtir ji halê xwerû yê rengdêrê nêrbûn, mêbûn û pirhejmarîbûna wê dîyar e.

### 5.2.RENGDÊR JI ALÎYÊ MANAYÊ VE

Ji alîyê manayê ve du tewir rengdêr hene:

**1) Rengdêrên Çawanîyê**

**2) Rengdêrên Dîyarkirinê**

**5.2.1.Rengdêrên çawanîyê**, li dû navdêrê dihên û rewş, şekil û rengê tiştan, yanî çawanîya rengdêran a sabît nîşan didin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| ardê **sipîyî** (zh) | arê[n] **spî** |
| awa **serdine** (m) | ava **sar** (m) |
| baro **giran** (n) | barê **giran** (n) |
| koyo **sipî** (n) | çiyayê **spî** (n) |
| nano **patîle** (n) | nanê **patîle** (n) |
| pantolê **sîyayî** (zh) | pantolê[n] **reş** |
| şewa **tarîye** (m) | şeva **tarî** (m) |

**5.2.2.Rengdêrên dîyarkirinê** jî îşaret, hejmar, nedîyarî û bi pirsê rewşa tiştan ya miweqet nîşan didin. Ev jî di nava xwe de dibin

çar beş:

**1) Rengdêrên Îşaretê**

**2) Rengdêrên Hejmarnavî**

**3) Rengdêrên Pirsê**

**4) Rengdêrên Nedîyarîyê**

**5.2.2.1.Rengdêrên îşaretê** dihên pêşîya navdêran û bi rêya îşaretê navdêran nîşan didin. Di kirdkî de rengdêrên îşaretê û cihnavên îşaretê eynî ne. Wek navdêran ew jî hem di halê xwerû hem halê tewandî de dihên bikaranîn.

Ji bo nêzîk di halê xwerû de:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **no** (n), **na** (m), **nê** (zh) | **ev** (n), **ev** (m), **ev** (ph) |

Ji bo dûr di halê xwerû de:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **o** (n), **a** (m), **ê** (zh) | **ew** (n), **ew** (m), **ew** (ph) |

Ji bo nêzîk di halê tewandî de:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **ney** (n), **naye** (m), **nînan** (zh) | **vî** (n), **vê** (m), **van** (ph) |

Ji bo dûr di halê tewandî de:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **ey** (n), **aye** (m), **înan** (zh) | **wî** (n), **wê** (m), **wan** (ph) |

**5.2.2.2.Rengdêrên hejmarnavî**, hejmar, rêz, qisim û mîqdara navdêran nîşan didin. Rengdêrên hejmarnavî, hejmara navdêran bi hejmarekê ku dihê pêşîya navdêrê nîşan didin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Di** metreyî vewre varaya. | **Du** metre befir barîye. |
| Mi **çar** kîloyî şeker herîna. | Min **çar** kîlo şeker kirrî. |

Rengdêrên rêza navdêran jî bi paşqertafa "**-in**" çêdibin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Di beşê pancine de rengdêrî estê. | Di beşa pên**cem** de rengdêr hene. |
| Ehmed bîyo yew**in**. | Ehmed bûye yek**emîn**. |
| Delale zî bîya diy**ine**. | Delal jî bûye duy**emîn**. |

Ji bo paşqertafa "**-in**" tiştê ku divê meriv dîqet bike ev e. Paşqertafa mêkîtîyê "**-e**" û paşqertafên pirhejmarîyê "**-î**" û "**-an**" piştî vê paşqertafa nîşandana rêzê dihên. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Wendekara yewin<u>e</u> Asmîn a. | Xwendekara yek**emîn** Asmîn e. |
| Govendgêrê yew**in**<u>î</u> ameyî. | Govendgêrên yek**emîn** hatin. |

**5.2.2.3.Rengdêrên pirsê** jî dem, rewş, şekil, reng, hejmar, mîqdar û cihê navdêran bi rêya pirsê nîşan didin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Çend** wendekarî ameyê? | **Çend** xwendekar hatine? |
| **Kamcîn** kitab de **çi** nuşto? | Di **kîjan** kitêbê de **çi** nivîsîye? |
| Sayî **key** û **senî** dare ra kewtê? | Sêv **kengî** û **çawa** ji darê ketine? |

**5.2.2.4.Rengdêrên nedîyarîyê**, bi awayekî ne dîyar navdêran nîşan didin. Di kirdkî de jî eynî wek kurmancî (**-ek**) paşqertafa "**-êk**" dihê dawîya navdêran û rengdêra nedîyarîyê çêdibe. Lê zêdetir ji kurmancî, di kirdkî de hejmarnavê "**yew**" (yek) jî dişê berîya navdêrê bihê nivîsîn û eynî wek ku bi paşqertafa "**-êk**" çêdibe, eynî wisa rengdêra nedîyarîyê çêbibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Bi **yew** qelema/qelem**êka** sûre nuşto. | Bi qelem**eka** sor nivîsîye. |
| **Yew** camêrd/camêrd**êko** derg ame. | Camêr**ekê** dirêj hat. |

Di vir de tiştê ku divê meriv dîqet bike ev e, her du awa bi hev re nayêne bikaranîn. Mesela, nabe ku meriv bibêje "Bi **yew** qelem**êka** sûre binuse." Yan divê meriv bibêje "Bi **yew** qelema sûre bi-

nuse." Yan jî "Bi qelem**ê**ka sûre binuse."

Di şîweya Dêrsimê de rengêdêrên nedîyarîyê bi paşqertafa "**-ê**" jî çêdibin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Merdim**ê** kitab**ê** ard. | Meri**vek** kitêb**ekê** anî. |
| Kênay**ê** qelem**ê** herîna. | Keç**ek** qelem**ekê** kirrî. |

Di vê şîweyê de rengdêrên nedîyarîyê qertafa ravekê wisa digirin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Merdim**êde** ba**şî** kitab**êde** qalind ard. | Meriv**ekê** baş kitêb**eka** stûr anî. |
| Kênay**êda** derge qelem**êda** sûre herîna. | Keç**eka** dirêj qelem**eka** sor kirrî. |

Ji rengdêrên nedîyarîyê çend nimûneyên din jî wisa ne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Wa **çend** kesî biwanê. | Bila **çend** kes bixwînin. |
| Karê ma bi **filan** û **bêvan**an çin o! | Karê me bi **filan** û **bêvan**an tune ye! |
| **Her** vaş kokê xo ser o beno zergun. | **Her** giha li ser koka xwe şîn dibe. |

# SIFRE

Hende serrî mîyan ra vîyartî, emrê to şi la to o sifre xo vîr ra nêkerd û nêkerd: sehenî senî pirr germîya belxulî bî; goştê dîkî, goşto sûrkerde senî ser o bi; uskurayê sifrênê ke pirr do bî; ê leyê pîyazê tezeyî senî reng daybî sifreyî. Û înan senî kewçike berdêne fekê xo; senî gaz dayêne hêtê dîkî yo sûrkerde ro; senî gaz dayêne leyê pîyazê tezeyî ro; senî uskuraya doyî berdêne verê fekê xo; senî lewê xo nayêne ser û fir kerdêne; senî piran fekê xo de cawitêne û qurtnayêne...

Kam gama ke o sifre yeno vîrê to, fekê to beno pirr awe, seke ti çîyê biqurtnî, ti winî awa fekê xo qurtnenî. Û dima ra zî, ti mîyanê ereqî de manenî. Şermêko bêrehm pencanê xo erzeno qirika to. Des kardî pêsero biginê sîneyê to ro, çilka gonî to ra nêşina. Ti pungirîyenî, ti ginenî pêro. Xeberdayîş to de nêbeno.

Hertim seke anika bo, a manzara winî tern û teze verê çimê to de ya. Ti temamê werdê dinya zî biwerî, çiqas werdo weş dinya de esto, heme sifreyê to ser o bo, ti cewayîr zî biwerî, nêkeno bi yew kewçika a germîya belxulî." (*)

*Roşan Lezgîn, Tarîyîya Adirî de, Weşanxaneyê Roşna, Dîyarbekir, 2012, r. 18

# SIFRE

Ewqas sal di navê re bihurîn, emrê te çû lê te ew sifre ji bîr ve nekir û nekir: sehen çawa tijî girara savarê bûn; goştê dîkî, goştê sorkirî çawa li ser bû; tasa sifirîn ku tijî dew bû; ew tayên pîvazê teze çawa reng dabûn sifreyê. Û wan çawa kevçî dibirin devê xwe; çawa gez li hêta dîkî ya sorkirî didan; çawa gez li taya pîvazê teze didan; çawa tasa dewî dibirin ber devê xwe; çawa lêvên xwe datanîn ser û fir dikirin; çawa parî di devê xwe de dicûtin û diqurtandin...

Çi gava ku ew sifre dihê bîra te, devê te dibe tijî av, mîna ku tu tiştekî biqurtînî, tu wisa ava devê xwe diqurtînî. Û li dû re jî, tu di nav xwêdanê de dimînî. Şermeka bêrehm pencên xwe diavêje qirika te. Deh kêr li ser hev li sîngê te kevin, çilka xwînê ji te nayê. Tu dipungirî, tu li hev dikevî. Xeberdan bi te re nabe.

Hertim wek aniha be, ew menzere wisa ter û teze li ber çavê te ye. Ti temamê xwarina dinyayê jî bixwî, çiqas xwarinên xweş hene, hemî li ser sifreya te bin, tu cewahîrî jî bixwî, nake bi kevçîyeka wê girara savarê.

# 6.CIHNAV

Peyvên ku bi awayekî muweqet cihê navdêr û tiştan digirin yan jî li cihê navdêr û tiştan dihên bikaranîn re dibêjin **cihnav**. Paşqertafên ravek û tewangê ku navdêr digirin cihnav jî dişên bigirin. Carinan rengdêr jî di cihê navdêran de dihên bikaranîn. Di kirdkî de jî eynî mîna kurmancî cihnav tim bi tena serê xwe dihên nivîsîn.

Li jêr em dê bala xwe bidin ser grûpên cihnavan.

## 6.1.CIHNAVÊN KESAN (ŞEXSAN)

Dema ku meriv kesekî (şexsekî) yan kesan (şexsan) îşaret dike yan jî nîşan dide, ji peyvên ku di cihê navê wan de dihên bikaranîn re dibêjin **cihnav**.

Di kirdkî de jî eynî wek kurmancî du grûpên cihnavan hene:

**1) Grûpa halê xwerû ya cihnavan**

**2) Grûpa halê tewandî ya cihnavan**

**6.1.1.**Grûpa halê xwerû ya cihnavên kesan:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **ez** (m) | **ez** (?) |
| **ti** (n m) | **tu** (n m) |
| **o** (n) | **ew** (n) |
| **a** (m) | **ew** (m) |
| **ma** (zh) | **em** (ph) |
| **şima** (zh) | **hûn** (ph) |
| **ê** (zh) | **ew** (ph) |

**6.1.2.**Grûpa halê tewandî ya cihnavên kesan:

| | |
|---|---|
| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| **mi** (n m) | **min** (n m) |
| **to** (n m) | **te** (n m) |
| **ey** (n) | **wî** (n) |
| **aye** (m) | **wê** (m) |
| **ma** (zh) | **me** (ph) |
| **şima** (zh) | **we** (ph) |
| **înan** (zh) | **wan** (ph) |

Di mijara cihnavên kirdkî de taybetîya ku divê meriv dîqet bike ev e. Cihnavê kesê yekemîn yê halê xwerû "**ez**", dixwazî ji bo camêr yan jinê be, tim **mê** dihê hesibandin. Lewre qertafa kişandina lêkera wê û qertafên raveka wê jî tim **mê** ne. Îcar cihnavê kesê yekemîn yê halê tewandî "**mi**", ji ber ku lêkera wê tim gerguhêz e, hingê qertafa kişandina wê jî tim li gor bireserê ye.

Dîsa di mijara cihnavan de teybetîyeka din ku divê meriv dîqet bike, heye. Cihnavên pirhejmarîyê yên kirdkî "**ma**" û "**şima**" hem di halê xwerû de hem di halê tewandî de tim eynî ne. Lê yên kurmancî di halê xwerû de wek "**em**" û "**hûn**", di halê tewandî de wek "**me**" û "**we**" ne.

Em cihnavên her du grûpan di nav hevokan de bikar bînin.

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Ez** vana, **mi** nuştbî. | **Ez** dibêjim, **min** nivîsîbû. |
| **Ti** ameyî la **to** nêwend. | **Tu** hatî lê **te** nexwend. |
| Senî ke **o** ame, mi qeleme da **ey**. | Çawa ku **ew** hat min qelem da **wî**. |
| **A** heta ke ameye ma karê **aye** kerd. | **Ew** heta ku hate me karê **wê** kir. |
| **Ma** ameyî û **ma** wend. | **Em** hatin û **me** xwend. |
| **Şima** ameyî la **şima** nêwend! | **Hûn** hatin lê **we** nexwend! |
| **Ê** yenê, tîya cayê **înan** o. | **Ew** dihên, li vir cihê **wan** e. |

## 6.2.CIHNAVÊN ÎŞARETÊ (NÎŞANÊ)

Gava ke em tiştekî yan tiştan îşaret dikin yan jî nîşan didin, em

li cihê navê wî tiştî yan wan tiştan bikar tînin. Cihnavên îşaretê jî wek yên kesan du grûp in:

**6.2.1.**Grûpa halê xwerû ya cihnavên îşaretê ji bo nêzîk:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **no** (n) | **ev** (n) |
| **na** (m) | **ev** (m) |
| **nê** (zh) | **ev** (ph) |

**6.2.2.**Grûpa halê xwerû ya cihnavên îşaretê ji bo dûr:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **o** (n) | **ew** (n) |
| **a** (m) | **ew** (m) |
| **ê** (zh) | **ew** (ph) |

**6.2.3.**Grûpa halê tewandî ya cihnavên îşaretê ji bo nêzîk:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **ney** (n) | **vî** (n) |
| **naye** (m) | **vê** (m) |
| **nînan** (zh) | **van** (ph) |

**6.2.4.**Grûpa halê xwerû ya cihnavên îşaretê ji bo dûr:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **ey** (n) | **wî** (n) |
| **aye** (m) | **wê** (m) |
| **înan** (zh) | **wan** (ph) |

Em cihnavên îşaretê ji bo nêzîk di her du halan de bikar bînin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **No ney** ra weşikêr o? | **Ev** ji **vî** xweşiktir e. |
| **Na** yena **naye** ra vîyarena. | **Ev** dihê ji **vê** dibihure. |
| **Nê nînan** ra kêrameyêr ê. | **Ev** ji **van** bikêrhatîtir in. |

Em cihnavên îşaretê ji bo dûr di her du halan de bikar bînin:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **O**yo ke aseno ti **ey** ra vanî? | **Ewê** ku dixuye tu ji **wî** re dibêjî? |
| **A**ya ke ti vanî **aye** ra başêr esta. | **Ew**a ku tu dibêjî ji **wê** baştir heye. |
| **Ê** qelemî **înan** ra başêr ê. | **Ew** qelem ji **wan** baştir in. |

## 6.3.CIHNAVÊN "XO", "CI", "PÊ", "YÊ"

* **Xo**: Di hinek şîwe yan jî devokên kirdkî de ev cihnav wek "**xwu**", "**xu**" û "**ho**" jî dihê gotin. Taybetyîyeka muhîm ya cihnavê "**xo**" ev e ku tim di halê xwerû de ye û nêrkî ye.

Em cihnavê "**xo**" di çend hevokan de bikar bînin:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| A **xo** ra hes kena. | Ew ji **xwe** hez dike. |
| Înan bi zor **xo** resna tîya. | Wan bi zor **xwe** gihand vir. |
| Aye **xo** ver ro da. | Wê li ber **xwe** da. |
| Aye **xo** ver o da. | Wê ji ber **xwe** ve da. |
| No makîne bi **xo** şuxulîyeno. | Ev makîne bi **xwe** dişuxule. |
| Ey dadîya **xo** ra hes kerdêne. | Wî ji dêya **xwe** hez dikir. |
| Ez kîseyê **xo** ra mesref kena. | Ez ji kîsê **xwe** mesrefê dikim. |

Di kirdkî de jî eynî wek kurmancî heke cihnavê "**xo**" bi peyveka din re bihê ber hev û peyveka nuh ya hevedudanî pêk bîne, hingê bi peyvê ve beste dihê nivîsîn. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Xo**ra ma heme kurd ê. | Ji**xwe** em hemî kurd in. |
| Azadî û **xo**serîye ra rûmetêr! | Ji azadî û ser**xwe**bûnê rûmettir! |
| **Xo**verdayîş serkewtene ano. | Ber**xwe**dan serketinê dîîne. |

* **Ci**: Ev cihnav her çendî wek preverba lêkeran bihê bikaranîn lê ev cihnav e û di eynî formê de hem ji bo nêr hem mê dihê bikaranîn. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Ci** ra vaje, wa nêyero. | **Jê** re bibêje, bila nehê. |

| | |
|---|---|
| Ez **ci** rê se bikerî êdî? | Ez **jê** re çi bikim êdî? |
| Ez **ci** ra hes kena. | Ez **jê** hez dikim. |

* **Pê**: Ev cihnav wek cihnavê "**ci**" bihê bikaranîn jî eynî mîna cihnavê "**xo**"yî hem ji bo nêrî hem mêkî hem jî pirhejmar dihê bikaranîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ti **pê** (bi ey/aye/înan) se kenî? | Tu **pê** (bi wî/wê/wan) çi dikî? |
| Ti nêeşkenî **pê** (bi ey/aye/înan). | Ti nikanî **pê** (bi wî/wê/wan). |
| To **pê** (bi ey) girewt! | To **pê** (bi wî) girt! |

* **Yê**: Ev cihnavê xwedîtîyê ye û ji bo nêr, mê û pirhejmarîyê wek hev dihê bikaranîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| O, **yê** min o. | Ew, **yê** min e. |
| A, **yê** min a. | Ew, **ya** min e. |
| Ê, **yê** min ê. | Ew, **yên** min in. |

## 6.4.HINEK CIHNAVÊN DIN

* Hinek cihnavên din jî ev in:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| aya bîne | ewa din |
| êyê bînî | ewên din |
| natîn | vîyalîn |
| oyo bîn | ewê din |
| tîya | vir |
| uca | wir |
| wetîn | wîyalîn |
| wina | wisa |
| winasî | wisakî |

* Hinek cihnavên pirsê:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ça; kotî; kura | ku; li kû; kîder |
| çi (çiçî) | çi |
| kam, -e | kî |
| kamcîn, -e | kîjan |

* Hinek cihnavên nedîyarîyê:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| bêvan | bêvan |
| çî | tişt |
| filan | filan |
| heme | hemî |
| her kes | her kes |
| pêro | hemî |
| pêrune | hemîyê wan |
| tayê | hinek |
| tu kes; çi kes | tu kes; çi kes |
| yew, -e | yek |
| zafine | gelekine |

# YEWÎYA KURDAN

**Murad CANŞAD**

Kam ke zîyadêrî behsê çîyêk keno, timûtim muhîmbîyayîşê ê çîyî îfade keno; beno ke nîyetê xo qet pê çin o. Qet ê çîyî nêwazeno.

Tayê merdimî estê, vanê exlaq, des exlaqî fek ra perrenê. La ma piro ewnênê ke qet eleqeyê xo bi exlaqî çin o. Bêexlaqîya tewr pîle ê kenê. Vanê, îman û îman, la îmansistê îmansistan ê.

Kurdî timûtim behsê yewîya kurdan kenê, qalê muhîmîya yewbîyayîşî kenê.

Verî, eşîrê kurdan estbîy. Hîna zî estê. Eşîranê kurdan ge pêro dayo ge pê kerdo. Meylê xo zêde pêrodayîşî ser o bîyo.

Demê partîyan dest pêkerd, erey bikewê zî kurdan cîya-cîya partî ronay. Ferqê nê partîyanê kurdan û eşîranê kurdan hema-hema qet nêbîyo. Partîyê kurdan eşîranê kurdan ra kêmî nîyê. Eşîran ca-ca pêkerdo, partîyan o zî nêkerdo!

Kurdan vato "cebheyo mîlî" yewbînî berdo-ardo, cebhe-mebhe ronênayo. Her kesî hetê xo ser kaş kerdo. Ey vato "ez", ney vato "ez".

Vato, "mecliso mîlî" bîlhasa partîyanê pîlan dorme ro yewbînî fetilnayo, çerixnayo. Kes yê xo ra nêameyo war. Her partî goreyê xo meclis ronayo. Çend meclisî vejîyayê meydan. Neke yewbîyayîşê kurdan, parçebîyayîşê kurdan aver şîyo.

Meclis ra teselîya xo fişnaya, vato, "kongreya mîlî". Nafa zî kongre ser o yewbînî berdo û ardo. Ancî ci ra teba nêvejîyayo. Neke "kongreya mîlî" kongreya partîyan ameya meydan. Sey meclisî çend kongreyî vejîyayê meydan!

Çend serrî yo ke behsê "konferanso mîlî" beno.

Çend serrî yo ke behsê ci beno la hîna gamêk zî nêameya eştene. Beno yan nêbeno, bellî nîyo. Bibo zî ancî ûsulo verên keweno kar, her partîya girde (girse) çend partîyanê qijekan ê dorûverê xo arê dana, ê xo kena. A vana yê mi rast o, na zî vana yê mi rast o.

Cebhe, meclis, kongre, konferans...

Eceba mumkin o ke mîyanê kurdan de çîyêko muşterek bêro ronayene, heme kurdî bi veng û rengê xo tede ca bigêrê? Beno yan nêbeno?

Meşte-bîro se beno dewran se vurîyeno, mumkin nîyo ke merdim ewro ra yew bi yew bizano. Ez çîyê verê çiman bivaja:

- Kurdî yewîye ra eciz benê!

# YEKÎTÎYA KURDAN

**Murad CANŞAD**

Kî ku zêdetir behsa tiştekî dike, timûtim muhîmbûna wî tiştî îfade dike; dibe ku nîyeta xwe qet pê tune ye. Qet wî tiştî naxwaze.

Hinek meriv hene, dibêjin exlaq, deh exlaq ji dev difirin. Lê em lê dinihêrin ku qet eleqeya xwe bi exlaqî tune ye. Bêexlaqîya herî mezin ew dikin. Dibêjin, îman û îman, lê îmansistên îmansistan e.

Kurd timûtim behsa yekîtîya kurdan dikin, behsa muhîmîya yekbûnê dikin.

Pêşî, eşîrê kurdan hebûne. Hîn jî hene. Eşîrên kurdan geh li hev xistine geh li hev kirine. Meyla xwe zêde li ser lihevxistinê bûye.

Dema partîyan dest pê kir, dereng bimînin jî kurdan cihê bi cihê partî danîn. Ferqa van partîyên kurdan û eşîrên kurdan qet nebûye. Partîyên kurdan ji eşîrên kurdan kêm nînin. Eşîran cih bi cih bi hev kirine, partîyan ew jî nekiriye!

Kurdan gotine "cebheyê milî" yekûdin birine anîne, cebhemebhe daneînane. Her kesî bi alîyê xwe ve kaş kiriye. Wî gotiye "ez", vî gotiye "ez".

Gotine "meclisa milî" bîlhasa partîyên mezin dor li yekûdin gerandine, çerixandine. Kes ji ya xwe nehatiye xarê. Her partî li gor xwe meclis danîye. Çend meclis derketine meydanê. Ne ku yekbûna kurdan, parçebûna kurdan pêşde çûye.

Ji meclisê teselîya xwe xistine, gotine, "kongreya milî". Îcar jî li ser kongreyê yekûdin birine û anîne. Dîsa tiştekî jê derneketîye. Neku "kongreya milî" kongreya partîyan hatiye meydanê. Wek meclisê çend kongre derketine meydanê!

Çend sal in ku behsa "konferansa milî" dibe.

Çend salin ku behsa wê dibe lê hîn gavek jî nehatiye avêtin. Dibe yan nabe, dîyar nîye. Bibe jî dîsa ûsula berê dikeve kar, her partîya mezin çend partîyên piçûk ên derûdora xwe berhev dike, bi ya xwe dike. Ew dibêje ya min rast e, ev dibêje ya min rast e.

Cebhe, meclis, kongre, konferans...

Eceba mumkin e ku di nav kurdan de tiştekî muşterek bihê danîn, hemî kurd bi deng û rengê xwe tê de cih bigirin? Dibe yan nabe?

Sibe-du sibe çi dibe dewran çawa diguhere, mumkin nîye ku meriv ji îro de yek bi yek bizane. Ez tiştê li ber çavan bibêjim:

- Kurd ji yekîtîyê eciz dibin!

# 7.HOKER

Peyvên ku manaya lêkeran li gor rewş, dem, cih, alî û çendinîyê dîyar dikin re dibêjin **hoker**. Bi giranî hoker ji peyvên mîna *çima, çawa, çiqas, kengî* û *kîjan alîyî ve* ku ji pêveberê dihên pirsîn pêk dihê. Peyvên mîna *jêr, jor, pir, hindik, pêşde, paşde, nika, zû, dereng* di nav hevokê de wek hoker dihên bikaranîn. Hoker di hin cihan de manaya lêkerê hêzdar di hin cihan de jî bisînor dikin. Hoker, bi tena serê xwe navê rewş, dem û mîqdarî ne. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed **rew** ame ti **erey** mendî. | Ehmed **zû** hat tu **dereng** mayî. |
| Mamosta karê xo **baş** keno. | Mamosta karê xwe **baş** dike. |

Em dişên di van şeş beşan de bala xwe bidin ser hokerê:

**1) Hokera Demê**

**2) Hokera Cihî**

**3) Hokera Cîhetê**

**4) Hokera Rewşê**

**5) Hokera Çendinîyê**

**6) Hokera Pirsê**

**7.1.Hokera demê**, manaya lêkeran ji alîyê demê ve dîyar dike. Yanî hereketê ku bûye wextê wê nîşan dide. Bersiva pirsên mîna *kengî, heta kengî, ji kengî ve, çi wext, kîjan gavê* ûhd dihê dayîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez **anika** şina, **siba** yena. | Ez **aniha** diçim, **sibê** dihêm. |
| **Vereşanêk** vejîya ame. | **Berêvarkî** derket hat. |

**7.2.Hokera cihî** nîşan dide ku kar li kîderê yan ji kîderê dibe. Yanî cihê ku kar tê de dibe, nîşan dide. Bersiva pirsên mîna *li kîderê*, *ji kîderê*, *di ku re* dihê dayîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez **zere de** şuxulîyena. | Ez **li hundir** dişuxulim. |
| Ez **Dîy'arbekir ra** yena. | Ez **ji Dîyarbekirê** dihêm. |

**7.3.Hokera cîhetê**, nîşan dide ku kar ber bi kîderê ve yan bi kîjan alîyî ve dibe. Yanî bersiva pirsên *bi kîjan alîyî ve*, *ber bi kîderê ve* dihê dayîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| O **ver bi Dîyarbekir** şino. | Ew **ber bi Dîyarbekirê** diçe. |
| Rinde **acêr** şina. | Rindê **berjêr** diçe. |

**7.4.Hokera rewşê**, nîşan dide ku kar çima û çawa dibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Dewlete **seba menfîetê xo** kena. | Dewlet **ji bo menfîeta xwe** dike. |
| Zelale **baş** goşdarî kerd. | Zelalê **baş** guhdarî kir. |

**7.5.Hokera çendinîyê**, manaya lêkerê ji alîyê mîqdarê ve dîyar dike. Bersiva pirsên *çiqas*, *çend* ûhd dide. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed **zaf** qisey keno. | Ehmed **pir** qise dike. |
| Wendekarî **yew bi yew** ameyî. | Xwendekar **yek bi yek** hatin. |

**7.6.Hokera pirsê**, ji alîyê pirsê ve manaya pêveberan dîyar dike. Bersiva pirsên *çi*, *bo çi* ûhd dihê dayîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Dersxaneyê şima **çira** teng o? | Dersxaneya we **çima** teng e? |
| Înan **welatî ser o** ruhê xo da. | Wan **li ser welatî** ruhê xwe da. |

# ÎKRAMKERDIŞÊ AWE

**Roşan Lezgîn**

Dewan de edet o, zafê reyan bê ke mêman awe biwazo, wayîrê keyeyî saetêk de di-hîrê rey tutano xo ra vano, awe bîyare bide mêmanan. Pişkurîyêk surahî gêno, awe dekeno tase û yew bi yew pêşkêşê mênanan keno.

Rojêk çend mêmanî ameybî keyeyê Ap Husê Keyê Hesan. Ap Husî venga lajê xo yê qijî da, va:

- Werze awe bide mêmanan.

Lajek werişt, surahî girewte, qedeh dekerd. Hema verê xo ra dest pêkerd, qedeh derga mêmanî kerd. La mêmanî eyê kîşta xo nawit, îşaret kerd ke verî bido ey. Lajek şi verê mêmanê bînî, qedeh derg kerd la nê mêmanî zî mêmanê hetê bînî nîşan da, va bide ey. Axir bi nê hawayî her kesî waşt ê bînî rê îkram bikero.

Lajê Ap Husî wina çend qorî şi û ame, ewnîya ke her yew ê bînî nîşan dano, hema surahîya awe û qedeho dekerde girewt berd peynîya oda de rona û ame cayê xo de ronişt.

Ap Husî hêrsî reyra va:

- Lalawo to çira awe nêda mêmanan?

Lajê Ap Husî wina sakîn û nermek va:

- Hela wa xo mîyan de qerar bidî, verî kam şimeno, ez dana bawo.

# ÎKRAMKIRINA AVÊ

Li gundan edet e, pirê caran bê ku mêvan avê bixwaze, xwedîyê malê di saetekê de çend caran ji zarokên xwe re dibêje, avê bînin bidin mêvanan. Pişkurîyek surehîyê digire, avê dike tasê û yek bi yek pêşkêşî mêvanan dike.

Rojekê çend mêvan hatibûn mala Ap Husê Keyeyê Husan. Ap Husî gazî lawê xwe kir, got:

- Rabe avê bide mêvanan.

Lawik rabû, surehî girte, qedehê dagirt. Hema ji ber xwe dest pê kir, qedeh dirêjî mêvanî kir. Lê mêvanî ewê kêleka xwe nîşan da, îşaret kir ku pêşî bide wî. Lawik çû ber mêvanê din, qedeh dirêj kir lê vî mêvanî jî mêvanê alîyê xwe yê din nîşan da, got bide wî. Axir bi vî awayî her kesî xwest ji yê din re îkram bike.

Lawê Ap Husî wisa çend qor çû û hat, nihêrî ku her yek yê din nîşan dide, hema surehîya avê û qedeha dagirtî bir li paşîya odeyê danî û hat li cihê xwe rûnişt.

Ap Husî bi hêrs jê pirsî got:

- Lawo te çima av neda mêvanan?

Lawê Ap Husî wisa sakîn û nerm got:

- Hela bila di nav xwe de qerar bidin, pêşî kî vedixwe, ez didim bavo.

# 8.DAÇEK

Peyvên ku bi tena serê xwe manayeka xwe tune ye lê gava ku di nav hevokê de bi peyvan re dihên ber hev û wezîfeyekê digirin, yanî bi alîkarîya wan di nav peyv û terman de mana çêdibe re dibêjin **daçek.** Di kirdkî de jî eynî wek kurmancî daçek tim cihê dihên nivîsîn.

Di kirdkî de sê cure daçek hene:

**1) Pêşdaçek**

**2) Paşdaçek**

**3) Dordaçek**

## 8.1.PÊŞDAÇEK

Pêşdaçekên kirdkî ev in: **bi**, **bê**, **ro**, **ver bi**

* **bi**: Ev pêşdaçek li hinek devokên kirdkî wek "**ebi**", "**ebe**" "**be**", "**eve**" û "**ve**", jî dihê gotin. Grûba Xebate ya Vateyî ku ji sala 1996an bi vir de li ser standardîzekirina kirdkî dixebite, forma "**bi**" wek standard qebul dike.

Em ji bîr ve nekin "**bi**" wek pêşqertaf (**bi**-) û preverb, herwisa wek gihanek û lêker jî heye.

Wekî daçek "**bi**":

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ti eşkenî **bi** ey? | Tu dişêyî/dikanî [**bi**] wî? |
| Duhok ra **bi** nat Zaxo yo. | Ji Dihokê **bi** vir de Zaxo ye. |
| Ez şina **bi** Dêrsim. | Ez diçim [**bi**] Dêrsimê. |

Ji bo ku ferqa wê bihê zanîn em li vir fonksîyonên din yên "**bi**"yê nîşan bidin baş dibe.

Wekî gihanek "**bi**":

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez **bi** qeleme nusena. | Ez **bi** qelemê dinivîsim. |
| Ti **bi** estore ameyî? | Tu **bi** hespê hatî? |
| Ez **bi** peranê xo herînena. | Ez **bi** pereyên xwe dikirim. |
| Roj **bi** roje baştir beno. | Roj **bi** roj baştir dibe. |

Wekî lêker "**bi**" (wekî lêker "**bi**", tenê ji bo lêkerên nêr dihê bikaranîn):

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| O kam **bi**? | Ew kî **bû**? |
| O Ehmed **bi**. | Ew Emed **bû**. |

"**bi**" wek pêşqertaf:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Merdimo **bi**aqil wina nêkeno! | Merivê **bi**aqil wisa nake! |

"**bi**" wek preverb û postverb:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Karê xo **bi**ke û nanê xo **bi**were. | Karê xwe **bi**ke û nanê xwe **bi**xwe. |
| Ey karê xo kerd**bi**, nanê xo werd**bi**. | Wî karê xwe kiri**bû**, nanê xwe xwari**bû**. |

* **bê**: Ev pêşdaçek negatîvê daçeka "**bi**" ye. Wek pêşqertafa negatîfîyê jî heye lê ferqa xwe ev e ku, daçek bi tena serê xwe, pêşqertaf bi peyvê ve beste dihê nivîsîn. Nimûne:

"**bê**" wek daçek:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Bê** aqil no kar nêbeno. | **Bê** aqil ev kar nabe. |

**Bê** çare nêbeno, ma rê çare lazim o. **Bê** çare nabe, ji me re çare lazim e.

| | |
|---|---|
| Ez **bê** to senî şina uca? | Ez **bê** te çawa diçim wir? |

"**bê-**" wek pêşqertaf:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Merdimo **bêaqil** nê karî keno! | Merivê **bêaqil** vî karî dike! |
| Ez xo rê **bêçare** menda. | Ez ji xwe re **bêçare** mame. |
| Bêtobîyayîş **bêkesî** ya! | Bêtebûyîn **bêkesî** ye! |

* **ro**: Di hinek devokên kirdkî de wek "**era**", "**re**" û "**ri**" jî dihê gotin. Ev daçek di hinek halan de hevberî daçeka "**li**" ya kurmancî dike. Lê hemî "**li**"yên kurmancîyê ku xwedîyê fonksîyonên cihê bi cihê ne, nabin daçeka "**ro**" ya kirdkî. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez **ro** to gêrena. | Ez **li** te digerim. |
| No kar **ro** to nêkeweno! | Ev kar **li** te nakeve! |
| Înan dor **ro** ma girewt. | Wan dor **li** me girt. |

* **ver bi**: Ev daçek hokera cîhetê temam dike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed **ver bi** ma yeno. | Ehmed **ber bi** me dihê. |
| Selwa **ver bi** cêr şina. | Selwa **ber bi** jêr diçe. |

## 8.2.PAŞDAÇEK

Paşdaçekên kirdkî jî ev in: **de, o**, **ra, rê, ro, wa**; **ya**; **a**

* **de**: Li hinek devokan wek "**di**" û "**der**" jî dihê gotin. Ev paşdaçek têdebûnê çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Kitab **de** nuşte yo. | **Di** kitêbê **de** nivîsandî ye. |
| Mase gole **de** bazar nêbeno! | Masî **di** golê **de** bazar nabe! |

* **o**: Ev daçek jî dimîne hinek halên daçeka "**li**" ya kurmancî. Lê daçeka "**li**" hertim pêşdaçek e, daçeka "**o**" ya kirdkî paşdaçek e. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| Ma to ser **o** qisey kerd. | Me **li** ser te (derheqê te de) qise kir. |
| Ma peran ser **o** pênêkerd. | Me **li** ser peran bi hev nekir. |
| Aye xo ver **o** kitab da mi. | Wê **ji** ber xwe **ve** kitêbê da min. |

Li hinek devokan yan jî hinek kes carinan vê paşdaçekê xelet bi kar tînin. Ji bo ku gramera kirdkî rast bihê fêmkirin, em çend nimûneyan bidin:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| Ma banî **ser o** qisey kerd. | Me **li ser** xênî qise kir. |
| Ma **serê** banî **de** qisey kerd. | Me **li serê** xênî qise kir. |
| Ma banî **ser ro** ameyî. | Em **di ser** xênî **re** hatin. |

* **ra**: Du fonksîyonên vê daçekê hene. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| Ez to **ra** hes kena. | Ez **ji** te hez dikim. |
| Ez to **ra** vana. | Ez **ji** te **re** dibêjim. |
| Dûrî **ra** ewnîya mi **ra**. | **Ji** dûr **ve li** min nihêrî. |
| Ez Dîyarbekir **ra** yena. | Ez **ji** Dîyarbekirê dihêm. |

Bi paşdaçeka "**ra**" lêkerên hevedudanî jî çêdibin. Heke lêker aktîv be, daçek cihê dihê nivîsîn. Na, heke lêker pasîv be yan jî ji lêkerê navdêr bihê çêkirin, hevedudanî dihê nivîsîn. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| To kurdkî xo vîr **ra** kerda? | Te kurdî **ji** bîr **ve** kiriye? |
| Xovîr**ra**kerdişê kurdkî gune yo! | **Ji**bîr**ve**kirina kurdî gune ye! |

* **rê**: Ev paşdaçek bêhtir halê "ji bo" çêdike. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| Ez to **rê** yew kitab herînena. | Ez **ji** te **re** (**ji bo** te) kitêbekê dikirim. |
| Biyere ez to **rê** deyîrêk vajî. | Were ez **ji** te **re** (**ji bo** te) straneke bibêjim. |
| Kamî **rê** çi ma se kenê! | **Ji** kê **re** çi (**ji bo** kê çi) em çi dikin! |

Ji bo ku ferqa daçeka "**ra**" û "**rê**" bihê zanîn, em nimûneyekê bidin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez to **ra** herînena. | Ez **ji** te dikirim |
| Ez to **rê** herînena. | Ez **ji** te **re** (**ji bo** te) dikirim. |

* **ro**: Em bi çend nimûneyan bala xwe bidin ser vê daçekê:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ma ko **ro** ameyî, ê deşte **ro**. | Em **di** çiyê **re** hatin, ew **di** deştê **re**. |
| Uca **ro** meşo, tîya **ro** şo. | **Di** wir **re** meçe, **di** vir **re** biçe. |
| Wele mi **ro** bo, qeda to **ro** gino! | Xwelî **li** min be, qeda **li** te keve! |
| Aye baş xo ver **ro** da. | Wê baş **li** ber xwe da. |

Hinek hene daçeka "**ro**" û "**o**" tevlihev dikin. Ji bo ku ferqa wan bihê zanîn em nimûneyekê bidin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Zelale baş xo ver **ro** da. | Zelalê baş **li** ber xwe da. |
| Zelale xo ver **o** cewab da. | Zelalê **ji** ber xwe **ve** cewab da. |

* **wa**; **ya**, **a**: Ev daçek jî wisa dihên bikaranîn:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Sayê sûrî pa **wa** zaf ê. | Sêvên sor pê **ve** pir in. |
| Camêrd çeka xo **ya** ameyo. | Camêr **bi** çeka xwe **ve** hatîye. |
| Wendekarê ma kam het **a** şîyî. | Xwendekarên me bi kîjan alî **ve** çûn? |
| Ti kam hetî **wa/ya** (het **a**) şinê? | Tu bi kîjan alî **ve** diçî? |

### 8.3.DORDAÇEK

Di kirdkî de dordaçek ev in: **di ... de**, **bi ... ra**, **bi ... wa/ya/a**

Li vir divê em îzeh bikin ku di kirdkî de, li halê ku dordaçek dihên bikaranîn, piranî pêşdaçek ketiye, tenê bi paşdaçekê hal dihê çêkirin. Esas, di hinek devokên kurmancî de jî pêşdaçek ketiye. Me-

sela, di devoka Serhedê de dibêjin:

| **Kurmancî** | **Kirdkî** |
|---|---|
| Mala me Licê **da** ye. | Keyeyê ma Licê **de** yo. |
| Bûkê te **ra** dibêjim, dîwaro tu fêm bike! | Vêkê to **ra** vana, dîwaro ti fehm bike! |

Herçiqas pêşdaçek ketibe lê dîsa jî di hinek devokên kirdkî de eynî wek kurmancî dordaçek dihên bikaranîn.

*** di … de**: Ev dordaçek, eynî wek kurmancî ye. Tenê divê meriv vê lê zêde bike ku di hinek devokan de wek "**ede** … **di**" û wek "**edi** … **di**" jî dihên gotin.

Em dordaçeka "**di** … **de**" bikar bînin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Di** kitab **de** de nuşte yo, biwane. | **Di** kitêbê **de** nivîsandî ye, bixwîne. |
| **Di** hişê aye **de** mendo. | **Di** hişê wê **de** maye. |

*** bi … ra**: Ev dordaçek, piranî dema ku du tişt li gel hev bihên gotin, dihê bikaranîn. Nimûne.

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Qeleme **bi** defterî **ra** bigîre bîya. | Qelemê **bi** defterî **ve** bigire bîne. |
| Manga **bi** golike **ra** biherîne. | Çêlekê **bi** golikê **ve** bikirre. |

*** bi … wa/ya/a**: Ev dordaçek, ji dordaçeka "**bi** … **ra**" rasttir e, di eynî fonksîyonî de ye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Qeleme **bi** defterî **wa/ya** bigîre bîya. | Qelemê **bi** defterî **ve** bigire biîne. |
| Manga **bi** golike **wa/ya** biherîne. | Çêlekê **bi** golikê **ve** bikire. |
| Çanteyî **bi** kitab **a** biherîne. | Çanteyî **bi** kitêbê **ve** bikire. |

## ERDÎŞE

Badê ke kelceyê ey merd, êdî çi sebeb ra bi nêame zanayîş la o zî nêweş kewtbi û roje bi roje nêweşîya ey xirabêr bîynî. Cinîya ey her şewdirêk doşek berdinê versîya tuyêra verkîyê înan de ravistinî, kewtinî binê çengê ey û berdinî serê doşekî de ronaynî.

Êdî hal ra kewtibi. Nata-weta merdimê ey û cîranî ameynê dorê ey de ronîştinê. Labelê destê kesî ra bê dua û nîyazan çîyê nêameynê. Xulasa, merdimanê ey rojêk yew mela peyda kerd ke bêro ey ser o biney biwano, dua biko û belkî zî tenê/tîkê temîyan seba axretî ro ey biko.

Axir mela ame. Yew şaşika zerde sereyê ey ro pişta û erdîşa ey zî derge bî. Melayî dest bi wendişî kerd. Dua ra pey tay şîret û temîyî ro camêrdê nêweşî kerdî, va:

- Hema ke destê Ezraîlî ro qirrika to nêpêşîyayê, qet nêbo xo rê tobe bike. Estexfara xo bîyare. Çunke ezabê qebrî zor o. Çanqilo asinên destê Nekîr û Munkîrî de yo, Homa nêko eke merdim xo şaş biko!

Zerrîya nêweşî bîye tenge û hesirî çimanê ey ra amey war. Paştîya xo şana qirmê tuyêre û bi vengêko sistek va:

- Xoce efendî, yew kelceyê mi estibi, nêweş kewt. Par nê wextan, binê na tuyêre de, cayo ke nika ti ronişteyî de wexto ke nîşor kerdinî, erdîşa ey zî sey erdîşa to leqaynî. Mi ke ewnîya erdîşa to ra, kelceyê mi ame vîrê mi û zerrîya mi xeripîya!

Melayî badê ke nê vateyî eşnawitî, hêrsî reyra werişt payanî û va:

- Gelî cematî! Eke şima barêk herre dekê yew lên, heşt rojî serê adirî de bigirênê, bigirênê û dima ra heşt rojî zî verê tîje de rafînê, bena helawe?

Cematî ra çend merdimanê ke hêşê înan biney şino çîyan ser, sereyê xo têşana û va:

- Ney!

Melayî hêrsê xo reyra çimê xo yê sûrî sereyê xo de reqisnay û va:

- A game, ney ra zî merdim nêvejîno!

Û kitabê xo kerd binê çengê xo, da piro şi." (*)

*Roşan Lezgîn, Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul 2007, r 16-17

## RIH

Piştî ku gîskê wî mir, êdî ji ber çi sedemî bû nehate zanîn lê ew jî nexweş ketibû û roj bi rojê nexweşîya wî xirabtir dibû. Jina wî her spêdeyekê doşekê dibir li sîya dartûya li pêşîya mala wan radixist, diket binê-çengê wî û dibir li ser doşekê datanî.

Êdî ji hal de ketibû. Virde-wêde merivên wî û cîran dihatin li dora wî rûdiniştin. Lêbelê ji destê kesî bêyî dua û nîyazan tiştek nedihat. Xulasa, merivên wî rojekê melayek peyda kir ku were li ser wî piçek bixwîne, dua bike û belkî jî derbarê axretê de hindek temîyan lê bike.

Axir mela hat. Şaşikeke zer li serê wî pêçayî û riha wî jî dirêj bû. Melê dest bi xwendinê kir. Piştî duayê hinek şîret û tembî li camêrê nexweş kir, got:

- Hê ku destê Ezraîlî li qirika te nelefîyane, qet nebe ji xwe re tobeyê bike. Estexfara xwe bîne. Çunke ezaba qebrê zor e. Çanqilê hesinî di destê Nekîr û Munkîrî de ye, Xwedê neke ger meriv xwe şaş bike!

Dilê nexweşî teng bû û hêstir ji çavên wî hatin xwarê. Pişta xwe da qurmê dara tûyê û bi dengekî sist got:

- Xoce efendî, min gîskek hebû, nexweş ket. Par van çaxan, li bin vê dara tûyê, li vî cihê ku niha ti rûniştî yî, dema ku kayîna xwe dikir, riha wî jî mîna riha te dihejîya. Min ku bala xwe da riha te, gîskê min hat bîra min û dilê min xira bû!

Melayî piştî ku ev gotin bihîstin, bi hêrs rabû ser xwe û got:

- Gelî cemaetê! Heke hûn barek herrî têxin sîtilekê, heşt rojan li ser agirî bikelînin û dû re heşt rojan jî li ber tavê raxînin, dibe helaw?

Ji nav cemaetê merivên ku hişê wan piçek diçû bi ser tiştan ve, serê xwe leqandin û gotin:

- Na!

Melayî ligel hêrsa xwe çavên xwe yên sor di serê xwe de reqisandin û got:

- Wê gavê, ji viya jî meriv dernakeve!

Û kitêba xwe kire binê çengê xwe, da rê çû.

# 9.GIHANEK

Ji peyvên ku di nav hevokê de peyvan yan grûpa peyvan yan jî îfadeyan bi hev ve girê didin re dibêjin **gihanek**. Gihanek jî dimînin daçekan lê ferqa wan ji daçekan ev e ku daçek ji alîyê manayê ve eleqeyê saz dikin lê gihanek beşên hevokê bi hev ve girê didin.

Heke daçek ji nav hevokê bihên derxistin, mana çênabe yan jî bi tevayî diguhere. Lê gihanek ji nav hevokê bihên derxistin, mana naguhere lêbelê dibe ku teng bibe. Esas gihanek ji bo temambûna manayê wezîfeyê digirin. Gihanek jî eynî wek daçekan di nav hevokê de hertim cihê dihên nivîsîn.

Dibe ku di kirdkî de gelek hebin lê çend gihanek ev in:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ancax | ancax |
| belkî | belkî |
| bi | bi |
| coka / loma | lewre / lewma |
| çend | çend |
| çi | çi |
| çi heyf ke | çi heyf ku / mixabin |
| çiqas | çiqas |
| çunke | çunke |
| eger | ger |
| eke | heke |
| ganî | divê |
| ge | geh |
| ge-ge | geh-geh, carinan |
| ha | ha |

| | |
|---|---|
| hela | hela |
| hem | hem |
| hem zî | hem jî |
| hende | hind, ewqas |
| heta | heta |
| hetanî | hetanî |
| ke | ku |
| la | lê |
| labelê | lêbelê |
| ne | ne |
| oxro ke | ne ku |
| reyde | li gel |
| reyra | li gel |
| tena | tenê |
| û | û |
| yan | yan |
| yan zî | yan jî |
| zî (kî) | jî |

Em van gihanekan her yekî bi dorê di nav hevokekê de bikar biînin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ti saetêk rayîr şirî **ancax** biresî uca. | Tu saetekê bimeşî **ancax** bigihî wir. |
| Ti biwane **belkî** o zî biwano. | Tu bixwîne **belkî** ew jî bixwîne. |
| Yew **bi** yew vejîyayî ameyî. | Yek **bi** yek derketin hatin. |
| Ez ameya **coka** (**loma**) ti ameyî. | Ez hatim **lewre** (**lewma**) tu hatî. |
| Ez **çend** zana ti zî **hende** zanî. | Ez **çiqas** dizanim tu jî **ewqas/hind** dizanî. |
| **Çi** cinî **çi** camêrd, her kes waneno. | **Çi** jin **çi** camêr, her kes dixwîne. |
| Çi **heyf ke** ezîyetê ey tewş ra şi. | **Çi heyf ku** ezîyeta wî di tewşê de çû. |
| Ez **çiqas** wanena **hende** musena. | Ez **çiqas** dixwînim **ewqas** fêr dibim. |
| Mamostayî ra biperse **çunke** o zano. | Ji mamostayî bipirse **çunke** ew dizane. |
| Ey nuşt **eger** ma zî biwendêne. | Wî nivîsî **ger** me jî bixwenda. |

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ti zanî vaje **eke** nêzanî biwane. | Tu dizanî bêje **heke** nizanî bixwîne. |
| Ey va biwane **ganî** to biwendêne. | Wî got bixwîne **divê** te bixwenda. |
| Ti **ge** eçî kenî **ge** maçî kenî. | Tu **geh** eçî dikî **geh** maçî dikî. |
| Ti **ge-ge** wanenî **ge-ge** nusenî. | Tu **carinan** dixwnînî **carinan** dinivîsî. |
| **Ha** vaje **ha** vaje, pere nêkeno. | **Ha** bêje **ha** bêje, pere nake. |
| Ma zaf xeyret kerd **hela** ma biewnîn se beno. | Me pir xeyret kir **hela** em binihêrin çi dibe. |
| Veyveke **hem** huyena **hem** bermena. | Bûk **hem** digirî **hem** dikene. |
| Tembur ceneno **hem zî** deyîre vano. | Li tembûrê dide **hem jî** distre. |
| Înan bi kuling, merrî **heta** bi destan zî kendêne. | Wan bi kuling, merr **heta** bi destan jî dikola. |
| Ez emşo **hetanî** siba aya menda. | Ez îşev **hetanî** sibehê hîşyar mam. |
| Bivaje **ke** ez bizanî ti çi wazenî. | Bibêje **daku** ez bizanim tu çi dixwazî. |
| Weş vano **la** ez bawer nîya bikero. | Xweş dibêje **lê** ez bawer nînim ku bike. |
| Ca eynî ca yo **labelê** dem eynî dem nîyo. | Cih eynî cih e **lêbelê** dem eynî dem nîye. |
| Ti **ne** wanenî **ne** nusenî. | Tu **ne** dixwînî **ne** dinivîsî. |
| Ez paweyê ey vinderta **oxro ke** nêno. | Ez li benda wî sekinîm, **ne ku** nayê. |
| Roşna maya xo **reyde** şîya dewe. | Roşna **li gel** dêya xwe çûye. |
| Mi kitab posta **reyra** şawit. | Mi kitêb **bi** postayê şand. |
| Eke ti ameya **tena** kitabê mi xo vîr ra meke. | Heke tu hatî **tenê** kitêba mi ji bîr ve meke. |
| Defter **û** qelema xo bigîre **û** binuse. | Defter **û** qelema xwe bigire **û** binivîse. |
| **Yan** şo **yan** ronişe biwane. | **Yan** biçe/here **yan** rûne/danişe bixwîne. |
| Roşna **yan zî** Şayla ra vaje. | Roşna **yan jî** ji Şaylayê re bibêje. |
| Ez rengê gule ra **zî** boya gule ra **zî** zaf hes kena. | Ez ji rengê gulê **jî** ji bêhna gulê **jî** hes dikim. |

Ji ber ku gihanek bi xwe cihê bêhnokê (,) digirin lewma rast nîye ku li pêşî yan li paşîya gihanekê bêhnok (,) bihê danîn. Lê di hinek

halan de dibe ku hewce bike. Nimûne:

**Kirdkî:** Ma hende va biwanîn **ke** êdî muyî ziwanê ma wa ameyî.

**Kurmancî:** Me ewqas got bixwînin **ku** êdî mû bi zimanê ve hatin.

**Kirdkî:** Çend xortî ameyî, **ke** Seydar zî mîyanê înan de bi, rojname girewt û şîyî.

**Kurmàncî** Çend xort hatin, **ku** Seydar jî di nav wan de bû, rojname kirrîn û çûn.

Dibe ku hinek gihanekên wan ne wekî hev bin yan jî forma wan ji hev cihê be lê di kirdkî û kurmanckî de ûsula bikaranîna gihanekan wek hev e.

# EMBAZÎYE

Mîye û bize embazê yewbînî bî. Gelek serrî û rojî têreyra vîyarnaybî. Yaban ra, mergan ra gêyraybî. Pîya çeraybî...

Rojêk gama ke mîye serê dereyî ra çil da, pey ra terrîya aye wedarîyaye û ronîyaye. Cayê mîye yê mehremî asayî.

Bize ke pey ra ewnîyaye aye ra, pirqî ginaye piro, xo rê pê huyaye.

Mîye fetilîyaye bize ser, va:

- Ti çî rê huyena?

Bize va:

- Herê ti zana? Wexto ke to serê dereyî ra xo çil da, canê to kewt teber, huyayîşê mi pê ame.

Mîye gelek wext bêveng mende.

Bize ewnîyaye ke embaza aye pungirîyaya, va:

- Herê se bi to rê? Ti hende leze heridîyena heww!

Mîye bineyke vinderte, dima ra ewnîyaye zereyê çimanê bize ra, va:

- Ez qurbanê Homayî bî! Yê to, serre diwês aşmî qemça to ha serê piştîya to de, her çîyê to ha meydan de. Caran huyayîşê mi bi halê to nêamebi. Rojan ra, serran reyke rîyê herê mi bi sîya ke mi serê dereyî ra xo çil da. Bêhemdîye ra canê mi kewt teber. Ez ewnêna ke ti ha qeşmerîya xo bi mi kena!

Û sereyê xo hewa na, da piro şî.(*)

Roşan Lezgîn, Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul 2007, r. 34

# HEVALTÎ

Mî û bizin hevalê hev bûn. Gelek sal û roj bi hev re bihurandibûn. Li çolê, li mêrgan bi hev re gerîyabûn. Bi hev re çêrîyabûn...

Rojekê gava ku mihê di ser newalê re çil da, par ve terrîya wê hil bû û daket. Derên mehrem ên mîhê xuya bûn.

Bizinê ku ji paş ve lê dinihêrî, pirqî bi ser ket, ji xwe re pê kenîya.

Mî fetilî bi ser bizinê de, got:

- Tu çima dikenî?

Bizinê got:

- Lê lê tu dizanî? Dema ku te xwe bi ser newalê re çil da, canê te derket derve, kenê min pê hat.

Mî gelek wext bêdeng ma.

Bizinê bala xwe dayê ku hevala wê pungirîye, got:

- Lê lê çi bû bi te? Tu ewqas zû dixeyidî heww!

Mî piçek sekinî, dû re li hundirê çavê bizinê nihêrî, got:

- Ez qurbana Xwedê bim! Yê te, salê duwazde meh qemça te wa ye li ser pişta te, her tiştê te li meydanê ye. Qet kenê min bi halê te nehatibû. Ji rojan, ji salan carekê rûyê kerê min reş bû ku min di ser newalê re xwe çil da. Ji bêhemdîyê canê min derket derve. Ez bala xwe didimê ku va ye tu qeşmerîya xwe bi min dikî!

Û serê xwe hilanî, lêxist çû.

# 10.QERTAF

Di ziman de ji deng yan jî parçeyên ku manayeka xwe tune ye lê gava ku bi peyvê ve dibestin manayeka nuh çêdikin re dibêjin **qertaf**. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **a** + cor = acor | **ber** + jor = berjor |
| **bê** + zar = bêzar | **bê** + zar = bêzar |
| **bi** + aqil = biaqil, -e | **bi** + aqil = biaqil |
| arê + **wan** = arêwan | aş + **van** = aşvan |
| asnawe + **ber** = asnawber | ajne + **ber** = ajneber |
| bilûre + **van** = bilûrvan | bilûr + **van** = bilûrvan |
| dewe + **ij** = dewij | gund + **î** = gundî |
| laj + **ek** = lajek | law + **ik** = lawik |
| nuşte + **ox** = nuştox | nivîs + **kar** = nivîskar |
| ver + **ên** = verên | pêş + **în** = pêşîn |
| ver + **in** = verin | **bi** + ber = biber |

Peyvên ku bi tena serê xwe xwedîyê mana ne û dema ku bi hev ve dibestin û peyveka din çêdikin, qertaf nînin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **dar** + nequr = darnequr | **dar** + nequr = darnequr |
| **hefs** + xane = hefsxane | **hefs** + xane = hefsxane |
| **heş** + dere = heşdere | **hirç** + newal = hirçnewal |
| **mar** + mase = marmase | **mar** + masî = marmasî |
| **payîz** + ware = payîzware | **payîz** + war = payîzwar |
| **vêre** + pîl = vêrepîl | **ur** + mezin = urmezin |

Di kirdkî de carinan çend qertaf dişên li dû hev bi hev bibestin û

her carê manayeka nuh çêkin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| sipî + **çol** = sipîçol | sipî + **çol** = sipîçol |
| sipî + **çol** + **ik** = sipîçolik | sipî + **çol** + **k** = sipîçolk |
| sipî + **çol** + **ik** + **in** = sipîçolikin | sipî + **çol** + **k** + **î** = sipîlçolkî |
| sipî + **çol** + **ik** + **in** + **e** = sipîçolikine | sipî + **çol** + **k** + **î** = sipîlçolkî |

## 10.1.ÇEND PÊŞQERTAF

Çend pêşqertafên kirdkî yên ku zêde dihên bikaranîn:

* **a-**: Ev pêşqertaf ji alîyê cîhetê ve manayeka nuh dide peyvê. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **a** + cêr = acêr | **ber** + jêr = berjêr |
| **a** + cor = acor | **ber** + jor = berjor |
| **a** + pey = apey | paş + **de** = paşde |
| **a** + ver = aver | pêş + **de** = pêşde |
| **a** + çarna + yîş = açarnayîş | **ve** + gerand+ in = vegerandin |
| **a** + gêra + yîş = agêrayîş | **ve** + ger + în = vegerîn |

* **bê-**: Ev pêşqertaf eynî wek kurmancî manaya negatîvîyê çêdike û ji navdêrê rengdêrê çêdike. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **bê** + aqil = bêaqil, -e | **bê** + aqil = bêaqil |
| **bê** + aqil + îye = bêaqilîye | **bê** + aqil + î = bêaqilî |
| **bê** + bext = bêbext, -e | **bê** + bext = bêbext |
| **bê** + bext + îye = bêbextîye | **bê** + bext + î = bêbextî |

* **bi-**: Ev pêşqertaf eynî wek kurmancî manaya pozîtîvîyê çêdike û ji navdêrê rengdêrê çêdike. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **bi** + aqil = biaqil, -e | **bi** + aqil = biaqil |
| **bi** + aqil + îye = biaqilîye | **bi** + aqil + î = biaqilî |

* **ne-**: Ev pêşqertaf eynî wek kurmancî manaya negatîvîyê dide peyvê. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **ne** + zan = nezan, -e | **ne** + zan = nezan |
| **ne** + zan + îye = nezanîye | **ne** + zan + î = nezanî |
| **ne** + kes = nekes, -e | **ne** + kes = nekes |
| **ne** + kes + îye = nekesîye | **ne** + kes + î = nekesî |

* **nê-**: Ev pêşqertaf eynî wek pêşqertafa "**ne-**" ya kurmancî manaya negatîvîyê dide peyvê. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **nê** + weş = nêweş, -e | **ne** + xweş = nexweş |
| **nê** + zana + yîş = nêzanayîş | **ne** + zanî + n = nezanîn |

## 10.2.ÇEND PAŞQERTAF

Çend paşqertafên kirdkî yên ku zêde dihên bikaranîn:

* **-an**: Ev paşqertaf eynî wek paşqertafa "**-an**" ya kurmancî di halê tewandî de pirhejmarîyê çêdike. Li hinek devokan wekî "**-on**" "**-o**", "**-ûn**", "**-û**" jî dihê gotin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Nê kitab**an** biwane. | Van kitêb**an** bixwîne. |
| Wendekar**an** ra vaje. | Ji xwendekar**an** re bibêje. |
| Ez xo rê qelem**an** herînena. | Ez ji xwe re qelem**an** dikirrim. |

Dema ku navdêrên pirhejmar di halê tewandî de raveka rengdêrê bigirin, wê demê di bikaranîna vê paşqertafê de ferqek di navbera kirdkî û kurmancî de çêdibe ku divê îzeh bibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Nê kitab**anê** sûr**an** biwane. | Van kitêb**ên** sor bixwîne. |
| Wendekar**anê** tembel**an** ra vaje. | Ji xwendekar**ên** tembel re bibêje. |

Çawa ku dixuye, paşqertafa ravekê "**-ê**" ya navdêrên pirhejmar piştî paşqertafa pirhejmarîyê "**-an**"ê hatiye, herwisa rengdêrê jî wek navdêrê paşqertafa "**-an**"ê girtiye. Di kurmancî de dema ku navdêrê (raveber) rengdêr (raveker) girtiye, paşqertafa pirhejmarîyê "**-an**" guherîye bûye "**-ên**" lê di kirdkî de paşqertafa ravekê "**-ê**" li dû paşqertafa pirhejmarîyê (**-an**) hatiye.

* -**ane**: Ev paşqertaf eynî wek paşqertafa "**-ane**" ya kurmancî aîdîyetê dide peyvê. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| camêrd + **ane** = camêrdane | camêr + **ane** = camêrane |
| cinî + **ane** = cinîyane | jin + **ane** = jinane |
| gişte + **ane** = giştane | pêçî + **...** = gustîl |
| menge + **ane** = mengane | meh + **ane** = mehane |
| roje + **ane** = rojane | roj + **ane** = rojane |

* -**ar**; **yar**: Ev paşqertaf ji navdêran rengdêrê çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| hiş + **ar/yar** = hîşar/hişyar, -e | hiş + **yar** = hişyar |
| bext + î**yar** = bextîyar, -e | bext + î**yar** = bextîyar |

* -**ber**: Ev paşqertaf eynî wek paşqertafa "**-ber**" ya kurmancî ji navdêrê navdêr û rengdêrê çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| asnawe + **ber** = asnawber, -e | ajne + **ber** = ajneber |
| ray + **ber** = rayber | rê + **ber** = rêber |
| rence + **ber** = rencber | renc + **ber** = rencber |

* -**dan**: Ev paşqertaf eynî wek paşqertafa "**-dan**" ya kurmancî di manaya cih de ji navdêrê navdêr çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| gule + **dane** = guldane (m) | gul + **dan** + k = guldank |
| wele + **dane** = weldane (m) | xwelî + **dan** + k = xwelîdank |

* **-dar**: Ev paşqertaf eynî wek paşqertafa "**-dar**" ya kurmancî di manaya xwedîtîyê de ji navdêrê rengdêrê çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| deyn + **dar** = deyndar, -e | deyn + **dar** = deyndar |
| dikan + **dar** = dikandar, -e | dikan + **dar** = dikandar |
| hêz + **dar** = hêzdar, -e | hêz + **dar** = hêzdar |
| mal + **dar** = maldar, -e | mal + **dar** = maldar |
| soz + **dar** = sozdar, -e | soz + **dar** = sozdar (xwedîsoz) |

* -**e**: Ev paşqertaf manaya mêkîtîyê dide peyvê. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| dar (n)+ **e** = dare (m) | dar |
| golik (n)+ **e** = golike (m) | golik |
| waştî (n)+ [y]**e** = waştîye (m) | xwestî (m) |

Me di beşa sêyem (r. 33-49) de behs kiribû ku di kirdkî de peyv bi tena serê xwe dişên nêr, mê û pirhejmar bin. Hinek peyvên mê ku di halê xwerû de bi "**a**" û "**î**" diqedin hene lê di esasê xwe de peyvên kirdkî bi paşqertafa "-**e**" dibin mê. Ev xusûsîyet di kurmancî de nîye. Di kurmancî de heta ku peyv di nav hevokê de neyê bikaranîn, cinsîyeta peyvê dîyar nabe.

* **-ek**: Ev paşqertaf piranî manaya piçûkkirinê dide peyvê. Lê di hinde halan de wek paşqertafa kurmancî "-**ok**"ê ji navdêrê rengdêrê jî çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| fise + **ek** = fisek, -e | fise + **ek** = fisek |
| gole + **ek** = goleke | gol + **ik** = golik (gola piçûk) |
| lac + **ek** = lacek | law + **ik** = lawik |
| ser + **ek** = serek, -e | ser + **ok** = serok |
| tirre + **ek** = tirrek, -e | tirr + **ek** = tirrek, -e |

* **-ene** (-*y***ene**): Ev paşqertafa raderê ye, navê lêkerê çêdike. Ni-

mûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| ame + *yene* = ameyene | hat + **in** = hatin |
| ard + **ene** = ardene | an + **în** = anîn |
| berd + **ene** = berdene | bir + **in** = birin |
| kerd + **ene** = kerdene | kir + **in** = kirin |

* **-ê**: Ev paşqertaf nedîyarîyê çêdike. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| mamostay**ê** | mamostay**ek** |
| merdim**ê** | meriv**ek** |
| qelem**ê** | qelem**ek** |
| welat**ê** | welat**ek** |

* **-êk**: Ev paşqertaf jî manaya piçûkkirinê dide peyvê û nedîyarîyê çêdike. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| bize + **êk** = bizêk, -e | bizin + **ik** = karik |
| mamosta + **êk** = mamostayêk (n m) | mamosta + **ek** = mamostayek |
| merdim + **êk** = merdimêk (n m) | meriv + **ek** = merivek |
| welat + **êk** = welatêk | welat + **ek** = welatek |

* **-ên**: Ev paşqertaf manaya aîdîyetê dide peyvê. Li gelek devokên kirdkî, eynî wek kurmancî "**-în**" e, lê Grûba Xebate ya Vateyî forma "**-ên**" wek standard qebul kiriye. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| cor + **ên** = corên | jor + **în** = jorîn |
| dar + **ên** = darên | dar + **în** = darîn (ji dar çêbûyî) |
| herre + **ên** = herrên | herrî + **în** = herrîn (tiştê ji herrîyê) |
| par + **ên** = parên | par + **în** = parîn (tiştê aîdê par) |
| ver + **ên** = verên | pêş + **în** = pêşîn (tiştê aîdê pêşîyan) |
| zerrn + **ên** = zerrnên | zêrr +**în** = zêrrîn (tiştê ji zêrr) |

* **-êna**: Bi vê paşqertafê di manaya "-a/ê din" a kurmancî de, tiştan duqat dike. Dema ku bi vê paşqertafê navdêr duqat dibin, yanî eynî wek qayîdeya paşqertafên nedîyarîyê "**-ê**" û "**-êk**" nêrîtî û mêkîtî têde xuya nake. Lê di qayîdeyê ku wek kurmancî "-a/ê din" çêdibe de nêrîtî û mêkîtî dixuyin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ancî+ **êna** = ancîna | dîsa + **eka din** = ...eka din |
| des + **êna** = desêna | deh + **eka din** = deheka din |
| hewte + **êna** = hewteyêna | hewfte + **eka din** = hefteyeka din |
| kitab + **êna** = kitabêna | kitêb + **eka din** = kitêbeka din |
| menge + **êna** = mengêna | meh + **eka din** = meheka din |
| merdim, -e + **êna** = merdimêna | meriv + **eka/ê din** = meriveka/ê din |
| reye + **êna** = reyna | car + **eka din** = careka din |
| roj, -e + **êna** = rojêna | roj + **eka/ê din** = rojeka/ê din |
| şewe + **êna** = şewêna | şev + **eka din** = şeveka din |
| welat + **êna** = welatêna | welat + **ekê din** = welatekê din |
| yew, -e + **êna** = yewna | yek + **a/ê din** = yeka/ê din |

Wekî kurmancî "**-a/ê din**" jî wisa çêdibe:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| hewtey**êko bîn** | hewftey**eka din** |
| kitab**êko bîn** | kitêb**eka din** |
| meng**êka bîne** | meh**eka din** |
| merdim**êka bîne** | meriv**eka din** |
| merdim**êko bîn** | meriv**ekê din** |
| rey**êka bîne** | car**eka din** |
| roj**êka bîne** | roj**eka din** |
| şew**êka bîne** | şev**eka din** |
| welat**êko bîn** | welat**ekê din** |
| yew**êka bîne** | y**eka din** |

* **-êr**: Du fonksîyonên vê paşqertafê hene; yek jê eynî wek paşqertafa "**-tir**" a kurmancîyê nîsbetê zêdetir dike, ya din ji navdêrê

rengdêrê çêdike.

Ji bo zêdekirina nîsbetê:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| baş + **êr** = başêr, -e | baş + **tir** = baştir |
| rind + **êr** = rindêr, -e | rind + **tir** = rindtir |
| weşik + **êr** = weşikêr, -e | xweşik + **tir** = xweşiktir |

Ji navdêrê çêkirina rengdêrê:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| cite + **êr** = citêr, -e | cot + yar = cotyar |

* **-êre**: Bi vê paşqertafê di kirdkî de navê daran çêdibe. Yanî navê meyweyê û ev paşqertaf dihên berhev, navê dara hêşîn çêdibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| mazî + **êre** = mazêre | mazî + dar = darmazî |
| goze + **êre** = gozêre | gûz + dar = daregûz |
| tu + **êre** = tuyêre | tû + dar = dartû |
| saye + **êre** = sayêre | sêv + dar = dara sêvê |
| murî + **êre** = murîyêre | hirmî + dar = darhirmî |

* **-î**: Di kirdkî de gelek fonksîyonên vê paşqertafê hene lê ya herî zêde di halê xwerû de paşqertafa pirhejmarîyê ye ku bi vî awayî di kurmancî de tune ye. Ji derveyî paşqertafa pirhejmarîyê, di hinek halên din de kirdkî û kurmancî wek hev in.

Ji bo paşqertafa pirhejmarîyê li halê xwerû yê peyvê:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| baş + **î** = başî (zh) | baş + ... = ... |
| ber + **î** = berî(zh) | der + ... = ... |
| ca + [y]**î** = cayî (zh) | cih + ... = ... |
| çem + **î** = çemî (zh) | çem + ... = ... |
| dizd + **î** = dizdî (zh) | diz + ... = ... |
| kurd + **î** = kurdî (zh) | kurd + ... = ... |

Di çêkirina manaya aîdîyetê de wek kurmancî ye. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| cenet + î = cenetî | cenet + î = cenetî |
| dewlet + î = dewletî | dewlet + î = dewletî |
| hind + î = hindî | hind + î = hindî |
| ko +*yî*/*hî* = ko*yî*/ko*hî*/ko*vî* | çîya +î = kovî |
| Osman + î = Osmanî | Osman + î = Osmanî |

Di çêkirina ji rengdêran navdêrên razber de. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| azad + î = azadî | azad + î = azadî |
| baş + î = başî | baş + î = başî |
| gendel + î = gendelî | gendel + î = gendelî |
| giran + î = giranî | giran + î = giranî |
| sivik + î = sivikî | sivik + î = sivikî |

Di çêkirina qayîde û awayî de; di çêbûna mensûbîyetê de wek kurmancî ye. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Botan + î = Botanî | Botan + î = Botanî (bi qayîde yan awayê Botanê) |
| kird + î = kirdî | kird + î = kirdî |
| kurmanc + î = kurmancî | kurmanc + î = kurmancî |
| siwar + î = siwarî | siwar + î = siwarî (bi qayîde û awayê siwaran) |
| şeker + î = şekerî | şeker + î = şekerî |
| tirk + î = tirkî | tirk + î = tirkî |

* **-îye**: Di çêkirina ji rengdêran navdêrên razber de. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| sosyalîst + **îye** = sosyalîstîye | sosyalîst + **î** = sosyalîstî |
| wayîr + **îye** = wayîrîye | xwedî + **tî** = xwedîtî |
| xoser + **îye** = xoserîye | serbixwe + **yî** = serbixweyî |

* **-ij**: Ev jî paşqertafeka mexsusê kirdkî ye, tenê ji bo candaran aîdbûna cihî nîşan dide. Li hinek devokan wek "**-ic**" û "**-iz**" jî dihê gotin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Dêrsim + **ij** = dêrsimij, -e | Dêrsim + **î** = dêrsimî (kesê/a ji Dêrsimê) |
| dewe + **ij** = dewij, -e | gund + **î** = gundî (kesê/a ji gund) |
| Ewropa + **ij** = ewropa*y*ij, -e | Ewropa + **î** = ewropî (kesê/a ji Ewropayê) |
| Hewlêr + **ij** = hewlêrij, -e | Hewlêr + **î** = hewlêrî (kesê/a ji Hewlêrê) |
| Mihabad + **ij** = mihabadij, -e | Mihabad + **î** = mihabadî (kesê/a ji Mihabadê) |
| Sine + ***y*ij** + sineyij, -e | Sine + ***y*î** = sineyî (kesê/a ji Sineyê) |

* **-in**: Du fonksîyonên vê paşqertafê hene; yek jê pêwerbûyînê, pêalandinê û hebûnê nîşan dide, yê duyem rêzê çêdike. Di halê duyem de, wek fonksîyona paşqertafa rêzê "**-emîn**" ya kurmancî ye.

Di manaya pêwerbûn yan pêalînê de:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| sole + **in** = solin | xwê + ... = bixwê |
| herrî + **in** = herrin | herrî + ... = biherrî (herrî pê werbûyî) |
| dar + **in** = darin | dar + ... = bidar (cihê bi dar û ber) |
| ver + **in** = verin | ber + ... = biber (ne kêmber) |

Di manaya çêkirina rêzê de:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| yew + **in** = yewin, -e | yek + **emîn** = yekemîn |
| des + **in** = desin, -e | deh + **emîn** = dehem |
| vîst + **in** = vîstin, -e | bîst + **emîn** = bîstemin |

* **-iş (-yîş / îyayîş)**: Ev paşqertafa raderê ye, ji lêkeran navdê-

ran çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ard + **iş** = ardiş | an + **în** + anîn |
| berd + **iş** = berdiş | bir + **in** = birin |
| da + **yîş** = dayîş | da + **yîn** = dayîn |
| deşt + **iş** = deştiş | dirû + **tin** = dirûtin |
| kiş + **îyayîş** = kişîyayîş | kuşt + **in** = hatin kuştin |

Çawa ku dixuye, di nimûneya dawîn de lêkera kirdkî xwerû ye lê lêkera kurmancî bi yarmetîya lêkereka alîkar çêbûye. Sedem ev e ku di kurmancî de lêkerên xwerû di halê pasîf de bi alîkarîya lêkereka alîkar dişên çêbibin. Lê di kirdkî de hinek lêkerên xwerû hem wek kurmancî dişên bi alîkarîya lêkereka alîkar çêbibin hem jî dişên bi tena serê xwe çêbibin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| diznîyayene / ameyene diznayene | hatin dizîn |
| kişîyayene / ameyene kiştene | hatin kuştin |
| nusîyayene / ameyene nuştene | hatin nivîsîn |
| vajîyayene / ameyene vatene | hatin gotin |
| veşnîyayene / ameyene veşnayene | hatin şewitandin |
| werîyayene / ameyene werdene | hatin xwarin |

Di kirdkî de du paşqertafên raderê hene; yek jê "**-iş** (-*y*î**ş** / **-îya-yîş**)" e ku ji lêkeran navdêran çêdike, yê din jî "**-ene** (-*y***ene**)" ye ku navê lêkerê çêdike. Lê di kurmancî de ji bo her du halan paşqertafa raderê tenê yek e: "**-in** (-*y***in**/-*t***in**/**-în**)" Di beşa raderê de (r. 127 ) ev mijar bêhtir tê şîrovekirin.

* **-kar**: Ev paşqertaf eynî wek kurmancî kar û taybetîyan çêdikin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| cefa + **kar** = cefakar, -e | cefa + **kar** = cefakar |
| dês + **kar** = dêskar, -e | dîwar + **kar** = dîwarkar |

| | |
|---|---|
| hurmet + **kar** = hurmetkar, -e | hurmet + **kar** = hurmetkar |
| lava + **kar** = lavakar, -e | lava + **kar** = lavakar, -e |
| sexte + **kar** = sextekar, -e | sexte + kar = sextekar |
| wende + **kar** = wendekar, -e | xwende + **kar** = xwendekar |
| xizmet + **kar** = xizmetkar, -e | xizmet + **kar** = xizmetkar |

* **-ker**: Ev paşqertaf jî ji navdêrê rengdêr yan jî navdêreka din çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| kar + **ker** = karker, -e | kar + **ker** = karker |
| zure + **ker** = zureker, -e | derew + **ker** = derewker |

* **-kî**: Ev paşqertaf qayîde û awayî çêdike. Di kurmancî de jî di eynî manayê de ye. Bêhtir dema ku peyv bi herfa bideng (vokal) diqede, paşqertafa "**-kî**" digire lê heke peyv bi herfa bêdeng (konsonant) biqede dişê wek "**-î**" be. Mesela, "şal û şapikê botan**î**" jî dibêjin "şal û şapikê botan**kî**" jî dibêjin.

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| kird + **î/kî** = kirdî/kirdkî | kird + **î/kî** = kirdî/kirdkî |
| serserî + **kî** = serserîkî | serserî + **kî** = serserîkî |
| zaza + **kî** = zazakî | zaza + **kî** = zazakî |

* **-mend**: Ev paşqertaf jî eynî wek kurmancî xwedîtîyê çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| bawer + **mend** = bawermend | bawer + **mend** = bawermend |
| dewle[te] + **mend** = dewlemend | dewle[t] + **mend** = dewlemend |
| huner + **mend** = hunermend | huner + **mend** = hunermend |

* **-mîn**: Ev paşqertaf jî wisa ye:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| hinge + **mîn** = hingemîn | mêşhingiv + **vîn** = hingivîn |
| gezo + **mîn** = gezemîn | gezo + **mîn** = gezemîn |

* -**o**: Ev paşqertaf navdêr û rengdêrên nêr çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| çep + **o** = çepo | çep + **o** = çepo |
| lal + **o** = lalo | lal + **o** = lalo |
| meşke + **o** = meşko | meşk + **o** = meşko |
| rêxe + **o** = rêxo | rêx + **o** = rêxo |
| rût + **o** = rûto | rût + **o** = rûto |
| zirt + **o** = zirto | zirt + **o** = zirto |

* -**ok**: Ev paşqertaf ji navdêrê navdêr û rengdêrê çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| heval + **ok** = hevalok, -e | heval + **ok** = hevalok |
| şerm + **ok** = şermok, -e | şerm + **ok** = şermok |
| ziwan + **ok** = ziwanok (n) | ziman + **ok** = zimanok |
| zîyan + **ok** = zîyanok, -e | zîyan + **ok** = zîyano |

* -**ox**: Ev paşqertaf di kirdkî de gelek dihê bikaranîn lê di kurmancî de hebe jî kêm e. Ji lêkerê rengdêrê çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| arêkerd + **ox** = arêkerdox, -e | berhev + **kar** = berhevkar |
| herîna + *y***ox** = herînayox, -e | stend + **ox** = stendox |
| nuşt + **ox** = nuştox, -e | nivîs + **kar** = nivîskar |
| rot + **ox** = rotox, -e | firot + **ox** = firotox, firoşkar |
| viraşt + **ox** = viraştox, -e | çêkir + **ox** = çêkirox, çêker |
| waşt + **ox** = waştox, -e | xwest + **ox** = xwestox, daxwazker |

* -**stan**: Ev paşqertaf navê cihê komela tiştan çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| gul + **i** + **stan** = gulistan | gul + **i** + **stan** = gulistan |
| kurd + **i** + **stan** = Kurdistan | kurd + **i** + **stan** = Kurdistan |
| ereb+ **i** + **stan** = Erebistan | ereb + **i** + **stan** = Erebistan |

* **-tir**: Ev paşqertaf wek kurmancî nîsbetê zêdetir dike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| baş + **tir** = baştir | baş + **tir** = baştir |
| weş + **tir** = weştir | xweş + + **tir** = xweştir |

* **-tî**: Ev. paşqertaf navdêrên razber çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| çerçî + **tî** = çerçîtî | çerçî + **tî** = çerçîtî |
| herî + **tî** = herîtî | kerî + **tî** = kerîtî |
| heval + **tî** = hevaltî | heval + **tî** = hevaltî |
| keya + **tî** = keyatî | keya + **tî** = keyatî |
| peya + **tî** = peyatî | peya + **tî** = peyatî |
| pîsî + **tî** = pîsîtî | pîsî + **tî** = pîsîtî |

* -**van**: Ev paşqertaf wek paşqertafa "-**ox**"î ji navdêran navê karî çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| bêrî + **van** = bêrîvane | bêrî + **van** = bêrîvan |
| bilûre + **van** = bilûrvan, -e | bilûr + **van** = bilûrvan |
| seyd + **van** = seydvan, -e | seyd + **van** = seydvan |
| tembur + **van** = temburvan, -e | tembur + **van** = temburvan |

* -**wan**: Ev paşqertaf jî eynî di fonksîyona paşqertafa "-**van**" de ye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| arê + **wan** = arêwan, -e | aş + **van** = aşvan |
| ga + **wan** = gawan, -e | ga + **van** = gavan, -e |

Qertafên kirdkî hemî ne ev in lê çend qertafên ku zêdetir dihên bikaranîn me li vir nîşan dan.

## TENA NAME KÊMÎ YO

- Ti zanî, mi qerarê xo dayo, ez wazena biba nuştox.

- Rast? Nuştoxîya çîyî, ti wazenî çi binusî?

- He'ma ti çi vajî. Ez şena her çî binusa. Hetanî nika bîy çend kovarî û kitabî ke ez wanena. Û mi çend kesê nuştoxî zî şinasnay. Mi panelan de goşdarîya çend nuştoxan kerde û mi înan de qisey zî kerd. Ez ewnêna ke nuştoxîye zaf çîyêdo zor nîyo. Çîyo ke înan nuşto, ez zî şena binusa. . .

- A tîya de vinde! Bêguman çîyo ke ameyo nuştiş, êdî zaf kesî û ti zî şenî binusî la esas çîyo muhîm o yo, çîyo ke tu kesî nênuşto ganî merdim binuso, nêke merdim nêşeno bibo nuştox.

- Ney, ney! Ti qet mi mexapêne. Nuştiş qet zor nîyo. Êdî mi qerarê xo dayo, ganî ez binusa û biba nuştoxêko zaf namedar.

- Qey ti nênusenî, kam nêverdano?

- Ti zanî? Mi hema xo rê yew name peyda nêkerdo, coka.

- Haa, name! Yanî nazname, mexles?

- Belê. Ganî ez zî xo rê yew nameyo weş bivîna, dima ra do bivînê ke nuştoxîye senîn a!

- Ê mi winî nêbi. Verê cû, mi çend nuştey nuştî. Mi waşt ke ez bişawa rojnameyî rê la o wext mi cesaret nêkerd ke ez bi nameyê xo yê rastikênî bida weşanayîş. Ti zî zanî ke o wext kesî nêaftaraynî bi nameyê xo yê rastikênî binuso. Îşkence, zindan! Û hetêk ra zî, ez bineyke egzîstansîyalîst a. . .

- O çi yo?

- Egzîstansîyalîzm, yew ekolo felsefî yo. Yanî, xo xeliqnayîş. . .

- Esgantalîst o, çik o? A game ez zî bena o!

- De baş o. Binuse, ti zî bibe nuştox. Qey do cayê mi teng bo?

- Name, name zaf muhîm o! Ez kena nêkena nêşena xo rê yew name peyda bika. Eke mi xo rê yew name peyda kerd, do xo rê camêrdan bivînê. Xeyrê xo rê, ti zî seba mi ro yew nameyê weşî bigêre ha. Eke to dî, mi ra vaje.

- Wa bo, çiman ser!"(*)

*Roşan Lezgîn Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneyê Vateyî, İstanbul 2007, r 63-64

# TENÊ NAV KÊM E

- Tu dizanî, min qerara xwe daye, ez dixwazim bibim nivîskar.

- Rast? Nivîskarîya çi, tu dixwazî çi binivîsî?

- Hema tu çi bibêjî. Ez dişêm her tiştî binivîsim. Heta bi niha bûn çend kovar û kitêb ku ez dixwînim. Û min çend kesên nivîskar jî nas kirine. Min di panelan de guhdarîya çend nivîskaran kiriye û ez ligel wan jî axifîme. Ez bala xwe didimê ku nivîskarî ne karekê dijwar e. Tiştê ku wan nivîsîye, ez jî dişêm binivîsim...

- A li vir raweste! Bêguman tiştê ku hatiye nivîsîn, êdî gelek kes û tu jî dişêyî binivîsî lê esas ya girîng ev e, tiştê ku tu kesî nenivîsîye divê meriv binivîse, nexwe meriv nikare bibe nivîskar.

- Na, na! Tu qet min mexapîne. Nivîsîn qet zehmet nîye. Êdî min biryara xwe daye, divê ez binivîsim û bibim nivîskarekê gelek navdar.

- Çima tu nanivîsî, kî nahêle?

- Tu dizanî? Min hê ji xwe re navek nedîtiye, ji ber wê ye.

- Haa, nav! Yanî nazname, mexles?

- Belê. Divê ez jî ji xwe re navekê xweş bibînim, dû re dê bibînin ku nivîskarî çawan e!

- Yê min wisa nebû. Pêşîyê min çend nivîs nivîsîn. Min xwest ku ez bişînim ji rojnameyê re lê wê demê min cesaret nekir ku ez bi navê xwe yê rastîn bidime weşandin. Tu jî dizanî ku wê demê kesî nediwêrî bi navê xwe yê rast binivîsanda. Şkence, zindan! Û ji alîyekê jî ez piçek egzîstansîyalîst im...

- Ew çi ye?

- Egzîstansîyalîzm, ekoleka felsefî ye. Yanî, xweafirandin...

- Esgantalîst e, çi ye? Wê gavê ez jî dibim ew!

- De baş e. Binivîse, tu jî bibe nivîskar. Qey dê cihê mi teng bibe?

- Nav, nav gelek girîng e! Ez dikim nakim neşêm ji xwe re navekî peyda bikim. Heke min ji xwe re navek peyda kir, dê ji xwe re camêran bibînin. Ji kerema xwe tu jî ji bo min li navekê xweşik bigere ha. Heke te dît, ji min re bibêje.

- Bila be, ser çavan!

# 11.PARTÎKEL

Partîkel jî mîna daçek û gihanekan bi tena serê xwe manaya wan tune ye lê daçek nînin, gihanek jî nînin. Bi alîkarîya partîkelan raweyên hinek deman çêdibin, dîsa bi hebûna wan manaya pêveberê temam dibe.

Di kirdkî de çend partîkel ev in: **de, derey, dê, do, ha, hela, ka, la, wa**

* **de:** Di qisekirinê de xwestinê îfade dike û alîkarî dike ku pêveber bêhtir qethî be. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| **De** vaje, çi esto ç i çin o? | **De** bêje, çi heye çi tune ye? |
| **De** ti kenî bike! | **De** tu dikî bike! |

* **derey**: Ev partîkel ji bo şaş fêmkirinê yan jî xwestinê dihê bikaranîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| **Derey** mi nêzana ti ameyî! | **De** min nizanî tu hatîyî! |
| **Derey** mi va, ez zî bişîyêne. | **De** min got, ez jî biçûma. |

* **do:** Ev partîkel alîkarîyê dike ku raweya dema bê çêbe. Di hinek devokan de wek "**go**", "**ko**" û "**o**" jî dihê gotin. Jixwe di kurmancî de jî formên wek "**dê**", "**ê**", "**yê**" û "**wê**" yên vê partîkelê hene. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| Ez **do** binusî. | Ez **dê** binivîsim. |
| Ti **do** biwanî? | Tu **dê** bixwînî? |

* **ha**: Bi alîkarîya vê partîkelê raweya dema niha ya dîyar (berdest/berdewam) çêdibe. Di hinek devokan de ev partîkel lêkera nîvco, yanî kopula digre. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| A **ha** ya nan wena. | Ew **va/wa** ye nan dixwe. |
| O **ha** yo nan weno. | Ew **va/wa** ye nan dixwe. |
| Ê **ha** yê nan wenê. | Ew **va/wa** ne nan dixwin. |

Di hinek devokan de bê lêkera nîvco dihê gotin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| A **ha** nan wena. | Ew **va/wa** nan dixwe. |
| O **ha** nan weno. | Ew **va/wa** nan dixwe. |
| Ê **ha** nan wenê. | Ew **va/wa** nan dixwin. |

* **hela:** Ev partîkel baldarîyê çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Hela** biewnî, se keno! | **Hela/ca** binihêre, çi dike! |

* **ka:** Ev partîkel jî alîkarîyê dike ku lêker bişide. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Ka** bide, ma bivînin çi yo! | **Ka** bide, em bibînin çi ye! |

* **la**: Ev partîkel bêhtir ji bo halê şaşbûyînê dihê bikaranîn. Nimûne.

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **La** ti nêvanî ma rayîr şaş kerd! | **Lê** tu nabêjî me rê şaş kir! |

* **wa**: Ev partîkel alîkarîyê dike ku pêveber çêbibe; fermana endîrekt çêdike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Roşna ra vaje **wa** bêro. | Ji Roşnayê re bibêje **bila** were. |
| Se beno **wa** bibo! | Çi dibe **bila** bibe! |
| **Wa** bo, **wa** sey to bo! | **Bila** be, **bila wek** te be! |

## ŞORBAYA ŞORE

Viraştişê Homayî yo. Eke qusûr bo, sîmaya ey, îfadeyê çiman û bîçimê rîyê ey mendêne safekan. Coka embazanê ey û zafê merdiman pê mesxere kerdêne. Labelê ey hol bi xo zanayne, xo ra bawer bi û zaf zî bisebr bi.

Vera heme yarîyan û heta bi mesxereyanê çorsan ey çi rey qelbê kesî nêşikitêne. Sey hereketanê xo yê nermekan û kîbaran, sey xoradayîşê kincanê xo yê maqulan tim bi nezaket, helîm û sakin bi.

Rasta ey, wayîrê yew zekaya piratîke û hazircewab nêbi la zaf zekî bi; seba ke zaf hetan ra ewnîyayne meseleyî ra, heme îhtîmalî hesab kerdinê, coka seke erey fam bikero aseyne. Her çî ser o derg û dila fikirîyayne; her çî zêr û zeber kerdêne, hulhulikê meseleyî vetêne. Wexto ke yew meseleyî ser o qisey kerdêne, tim gumanê ey o bi ke merdimê ke ey goşdarenê, beno ke şaş fam bikerê yan zî kêmî fam bikerê, aye ra derg-derg qisey kerdêne; bi teferruatanê hurdî-hurdîyan îzeh kerdêne. Seba nê heme xusûsîyetan ra, merdiman bi çimê yew saxekî ewnîyayne ey ra; hertim muameleyê saxekan ey de kerdêne.

A şewe bibi mêmanê keyeyê embazanê xo. Serê sibayî, seba arayî kebanî uskuraya şorba naybî ey ver. La aye û mêrdeyê xo, seba ke bi ey bineyke mesxere bikerê, xebera xo kerdebî yewe û zîyade sole eştebî mîyanê uskuraya ey. Ey kewçika verêne de fam kerd ke şorba zaf şor a labelê nezaketê xo ra şerm kerd, rîyê ey nêgirewt ke vajo "şorbaya şima şor a". Qet nêard xo ser. Şorbaya xo werde, qedênaye.

O beyntar de mêrde û cinîya wayîrê keyeyî ke embazê ey bî, her di binê çiman ra ewnîyayne ey ra û xo rê binê zimbêlan ra pê huyaynê.

Axir arayîya xo kerde. Zaf sipas kerd. Xatir waşt û kewt teber şi.

Hêdî-hêdî şîyêne û şor bîyena şorba ser o fikirîyayne. Keye ra epey kewtibi dûrî la peynî de bi hawayêko qetî mesele fam kerdbi. Seba ke xo rê pê mesxere bikerê, înan mexsûs zîyade sole eştebî şorba!

Vindert. Epey vindert...

Nişka ra apey agêra.

Gama ke dayne ber ro hema zî her di wayîranê keyeyî qalê ey kerdêne û xo rê hirr-hirr huyayne. Wexto ke înan ber akerd û mêmanê xo verê berî de dî, her di zî şaş bî.

O beşirîya û bi vengê xo yê nermekî va:

- Şorbaya şima zaf şore bî. Mi va ez şima ra vaja ke şima nêvajê "ey tey nêveto ke ma mexsus wina kerdo!"

Nara bî hirr-hirra heme hîrine, xo rê bi halê xo huyayî...(*)

*Roşan Lezgîn, Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul 2007, r. 12-13

## ŞORBEYA ŞOR

Çêkirina Xwedê ye. Ger qusûr be, ji sîmaya wî, îfadeya çavan û bîçima rûyê wî, dirûvê safekan pê diket. Lewre hevalên wî û gelek merivan pê mesxere dikirin. Lêbelê wî baş bi xwe dizanîbû, ji xwe bawer bû û gelek jî bisebr bû.

Li hemberî hemî yarîyan û heta bi mesxereyên çors, wî tu car dilê kesî nedişikand. Wekî tevgerên xwe yên nerm û kubar, wek lixwekirina kincên xwe yên maqul, tim bi nezaket, helîm û sakin bû.

Rastîya wê, xwedîyê zekayeka piratîk û hazircewab nebû lê gelek zekî bû; ji ber ku ji gelek alîyan ve li meseleyê dinihêrî, hemîyê îhtîmalan hesab dikir, lewre mîna ku dereng tê bigihe wisa dixuya. Li ser her tiştî dûr û dirêj difikirî; her tişt zêr û zeber dikir, hulhulika meseleyê derdixist. Dema ku li ser meseleyekê qise dikir, tim gumana wî ew bû ku merivên ku guhdarîya wî dikin, dibe ku şaş fêm bikin yan jî kêm fêm bikin, ji ber vê dûr û dirêj qise dikir; bi teferuatên hûrik bi hûrik îzeh dikir. Ji ber van hemî taybetmendîyan, merivan bi çavê saxekekî lê dinihêrîn; her tim muameleya saxekan pê re dikirin.

Wê şevê bûbû mêvanê hevalên xwe. Serê sibehê, ji bo taştê kevanîyê tasa şorbeyê danîbû ber wî. Lê wê û mêrê xwe, ji bo ku piçek bi wî mesxere bikin, xebera xwe kiribûn yek û zêde xwê avêtibûn nav tasa wî. Di kevçîya pêşî de tê gihîşt ku şorbe şor e lêbelê ji ber nezaketa xwe şerm kir, rûyê wî negirt ku bibêje “şorbeya we şor e”. Qet neanî ser xwe. Şorbeya xwe xwar, qedand.

Di wê navê de mêr û jin yên xwedîyên malê, ku hevalên wî bûn, her du di bin çavan re li wî dinihêrîn û ji xwe re di bin simbêlan re pê dikenîyan.

Axir taştêya xwe kir. Gelek sipas kir. Xatir xwest û derket derve çû.

Hêdî hêdî diçû û li ser şorbeya şor difikirî. Ji mal gelek dûr ketibû lê di dawîyê de bi awayekê qethî mesele fêm kir. Ji bo ku ji xwe re pê mesxere bikin, wan mexsûs zêde xwê avêtibûn tasa wî!

Rawestîya. Gelek sekinî.

Ji nişka ve paşde vegerîya.

Gava ku li derî dida hê jî her du xwedîyên malê qala wî dikir û ji xwe re hirr-hirr dikenîyan. Dema ku wan derî vekir û mêvanê xwe li ber derî dît, her du jî şaş bûn.

Ew bişirî û bi dengê xwe yê nerm got:

- Şorbeya we gelek şor bû. Min got ez ji we re bibêjim ku hûn nebêjin “wî tê dernexist ku me mexsûs wisa kiriye!”

Îcar bû hirr-hirra her sêyan, ji xwe re bi halê xwe kenîyan...

# 12.RAVEK

Ravek dihê manaya îzafeyê yanî temamkirinê. Dema ku navdêrek bi alîkarîya veqetandekê bi navdêrek yan rengdêreka din ve dihê girêdan, yanî yek dibe raveker û ya din jî dibe raveber, hingê jê re dibêjin **ravek**.

Di kirdkî de jî eynî wekî kurmancî du awa ravek hene:

**1) Ravekên Navdêran**

**2) Ravekên Rengdêran**

**12.1.Ravekên navdêran** ew in ku, bi alîkarîya veqetandekê navdêrek bi navdêreka din ve dihê girêdan. Yanî hem raveker hem raveber navdêr in.

Veqetandekên ravekirinê di kirdkî de jî eynî wekî kurmancî li gor nêrîtî, mêkîtî û pirhejmarîyê dibin. Di kirdkî de veqetandeka navdêrên nêr û pirhejmar wekî hev, yanî "**-ê**" ye, veqetandeka navdêrên mê jî tim "**-a**" ye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Veng**ê** Azadî weş **o**. (n) | Deng**ê** Azadî xweş **e**. |
| Beşn**a** Asmîne derg **a**. (m) | Beşn**a** Asmînê dirêj **e**. |
| Çim**ê** Zelale zaf weşik **ê**. (zh) | Çav**ên** Zelalê pir xweşik **in**. |

**12.2.Ravekên rengdêran** jî ew in ku, bi alîkarîya veqetandekê navdêr û rengdêrekê wekî raveker û raveber bi hev ve dihên girêdan. Di kirdkî de qertafên ravekê yên halê xwerû û halê tewandî yek nînin.

Qertafên halê xwerû yên ravekên rengdêran wisa ne:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| Vengo azad. | Dengê azad. |
| Beşna derge. | Beşna dirêj. |
| Çimê weşikî. | Çavên xweşik. |

Qertafên halê tewandî yên ravekên rengdêran jî wisa ne:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| Ez vengê azadî ra hes kena. | Ez ji dengê azad hez dikim. |
| Ez beşna derge ra hes kena. | Ez ji beşna dirêj hez dikim. |
| Ê çimanê weşikan megîre. | Wan çavên xweşik megire. |

Wekî ku dixuye, di kirdkî de navdêrên nêr di ravekên rengdêran de, di halê sade de tim veqetandeka "**-o**" digrin. Lê di halê tewandî de eynî wekî ravekên navdêran veqetandeka "**-ê**" digirin. Navdêrên pirhejmar, di halê sade de paşqertafa pirhejmarîyê ya halê xwerû "**-î**" didin rengdêrê. Lê di halê tewandî de hem raveber hem raveker her du jî paşqertafa pirhejmarîyê ya halê tewandî "**-an**"ê digirin û piştî girtina vê qertafê hîn raveber veqetandeka "**-ê**" digire. Ji bo hinekê din melûmat, di rûpelên 94-95 de li beşa qertafa "**-an**"ê binihêre.

## 12.3.RAVEKÊN RÊZILKÎ

Dema ku raveka tiştekî bi çend tiştan çêbibe, dibêjin **raveka rêzilkî**. Ev jî di nav xwe de wekî halê xwerû û halê tewandî dibin du beş.

Ravekên rêzilkî yên navdêran wisa dibin:

**Kirdkî**: Ehmedê Hesenê Musayê Mistefayî (n)

**Kurmancî**: Ehmedê Hesenê Musayê Mistefayî (n)

**Kirdkî**: Asmîna Sînema Xezala Eyşane (m)

**Kurmancî**: Asmîna Sînema Xezala Eyşanê (m)

**Kirdkî**: Lajê Mehemedê sûrî ame.

**Kurmancî**: Lawê Mehemedê sor hat.

**Kirdkî**: Lajê Mehemedî **yo** sûr ame.
**Kurmancî**: Lawê Mehemedî **yê** sor hat.

**Kirdkî**: Kênaya Sînema derge ameye.
**Kurmancî**: Keça Sînema dirêj hat.

**Kirdkî**: Kênaya Sîneme **ya** derge ameye.
**Kurmancî**: Keça Sînemê **ya** dirêj hat

Di ravekên rêzilkî yên rengdêran de qertafa ravekê ya halê xwerû û halê tewandî ya navdêrên nêr yek nînin.

Ji bo halê xwerû ravekên rêzilkî:
**Kirdkî**: Ehmed**o** derg**o** sûr**o** qelew vano.
**Kurmancî**: Ehmed**ê** dirêj**ê** sor**ê** qelew dibêje.

**Kirdkî**: Asmîna çimhêşîna keja derge vana.
**Kurmancî**: Asmîna çavşîna keja dirêj dibêje.

Ji bo halê tewandî ravekên rêzilkî:
**Kirdkî**: Ehmed**ê** derg**ê** sûr**ê** qelew**î** vatbi.
**Kurmancî**: Ehmed**ê** dirêj**ê** sor**ê** qelew gotibû.

**Kirdkî**: Asmîna çimhêşîna keja derge vatbi.
**Kurmancî**: Asmîna çavşîna keja dirêj gotibû.

# REM

O fotografo ke ma pîya Parkê Trafîkî de antibi, mîyanê çarçewa de serê masa de yo. Nika kîşta saete de sey xîyalêko ke mîyanê mijî ra biewnîyo aseno. Ez nêzana, belkî zî çimê mi bîyê xumamin. Huyayîşêko nîmcet lewanê Şemale wa neqeşîyayo. Ez, hewna sey her game mehzun a. O çax ma hema lîse de wendêne. Serê masa de defter û kitabê ma asenê û di qedehê çay ke heta nîme amey şimitene. Peyê ma de zî dêsê bedenî; lema lafoke heta dîyar pencê xo eştê ra dêsî.

Ez zaf rincan a. Destê mi her çî ra, heme çî ra, dinya ra bîyê serdin. Xora ez heta nika tu çîyêk rê zî nêbîya. Ez tu dolabêk rê nêbîya destikêk. Ger ez bîya destik, o zî destikê destare yo. A destara ke her tim canê mi tehnena, kena ardî; wel û werdî. Ez se ra erzena, kam het a şina tewş o. Ez kena nêkena nêbeno. Peymawena, sencena, vêjena... Hewa! Nêbeno. Her çî, heme çî vayî şano xo ver û beno. Destê mi zî sey zerrîya mi veng û varit. Qey ez verê cû ra, wexto ke dadîya xo ra bîya ez winî bîya? Ez nêzana. Gelo şima vanî bextê merdimî sîya yo, yan ê welatê merdimî?

No şeş rojî yo ke ez zereyê na oda ra nêvejîyaya teber. Serdî ver zeregilora mi recefîyena. Pîzeyê mi vik û veng. Cixara min a peyêne ez nêzana çend rojî yo qedîyaya. Hişyarîya mi û rakewtişê mi seypê yê. Ez nêzana ke ez haya ya yan rakewte. Ge-ge çimê mi benê tarî. Tîrêke mîyanê linganê mi de dej dana. Hema zî gonî mi ra şina. Ez vana qey reyayê binê çenganê mi visîyey. Leşa mi heme bîya kewe. Vanî "Fîlîstîn asqisi". Çi asqî! (*)

*Roşan Lezgîn, Binê dara Valêre de, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2003, r 15-16

## REV

Ew fotografê ku me bi hev re li Parka Trafîkê kişandibû di nav çarçeweyê de li ser maseyê ye. Niha li kêleka saetê mîna xeyaletekî ku ji nav mijê binihêre, dixuye. Nizanim, belkî jî çavên min bûne xumam. Kenekî nîvçe bi lêvên Şemalê ve neqişiye. Ez, mîna her gav, mehzûn im. Wê demê me li lîseyê dixwend. Li ser maseyê defter û kitêbên me dixuyin û du qedehên çayê ku heta nîvî jê hatiye vexwarin. Li pişt me jî, dîwarê reş yê bedenê; lavlavkê heta bi diyar pencên xwe avêtine dîwarî.

Gelekî westiyayî me. Destên min ji her tiştî, ji dinê sar bûne. Jixwe, heta niha ez ji tiştekî re jî nebûm; ji tu dolabekê re nebûm destikek. Ger ez bûme destik, ew jî destikê destarê ye. Ew destara ku canê min dihêrîne. Dike ar; hûrûpizûr. Bi kîjan hêlê ve diavêjim, bi kîjan aliyî ve diherim, tewş e. Dikim nakim, nabe. Dipîvim, diwezinînim, li bêjingê dixim... Hewa! Nabe. Hemû tiştî; her tiştî ba bi xwe dikişîne û dibe...

Destên min jî mîna dilê min vikîvala. Gelo ez ji mêj ve, wexta ez ji diya xwe bûme, ez wisa bûm? Nizanim. Gelo ji we tirê bextê merivî reş e, yan yê welatê merivî?

Ev şeş roj in ku ez ji vê odeyê derneketime derve. Ji serma dilê min diricife. Zikê min vikîvala. Cixara min a dawîn nizanim ev çend roj e qediyaye. Hişyarî û razana min wekî hev in; nizanim bê niha şiyar im yan li xewê me. Car bi car çavên min ji binî ve tarî dibin. Janekê di nav lingên min de tîr dike. Hîn jî xwîn ji min diçe. Dibêjim qey rehên binçengên min qetiyane. Digotin, "Filistin Askısı." Çi asqî!(*)

*Roşan Lezgîn, Li Bin Dara Biyê, Weşanên Elma, Îstanbul, 2003, r. 18-19

# 13.BANEŞAN

Di ziman de ji peyvên ku heyretkirin, şaşbûyîn, şabûyîn, xemgînbûyîn, veciniqîn, tirsîn, dilê xwe şewitîn, canê xwe êşîn ûhd îfade dikin re dibêjin **baneşan**. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| **Ox**! Keyf keyfê to yo. | **Ox**! Kêf kêfa te ye. |

Gava ku baneşan dihên nivîsîn, gelekê caran îşareta baneşanê (!) li dawîya wan dihê danîn. Di zimanê devkî de gelek baneşan dema ku dihên gotin, herfên bideng dirêj dibin yan jî baneşan bi xwe dubare dibin. Yanî di xwendin û gotinê de awayê bilêvkirina baneşanan gelek muhîm e.

Hinek baneşanên kirdkî ev in:

*a, ay, aferîn, aha, ax li min, ax, bawo, çi heyf, çirr, çirt, ço, dayê, de biwere, de gidî, de, dêh, errik, ey, eyla, ê, gidî, gijjj, gunekê, ha, hah, hahû, haydê, hela hela, hela, helal, helal bo, herê, her-herê, her-hero, hero, hewar, hewaro, hewwû, hey, heyf, heyhat, heyret, heywax, hop, ḥopela, hoy, hoyş, la, lê, lo lo, mîrat, nêbo ha, nêbo nêbo, nêwero, nê harê, ox, oxeyş, oy, pehe, pepûg, piz, qurr, riswatî, tehe, tew, tew lo, tifû, tirr, tobe tobe, tobe, uff, wax li min, wax wax, wax, way, wey, wî, wîy, wuşş, ya Rebî, ya, zir, zirt*

Em van baneşanan bi rêzê di nav hevokê de bikar biînin:

| Kirdkî | Kurmancî |
| --- | --- |
| **Aaa**! Ti se kenî? | **Aaa**! Tu çi dikî? |
| **Ay**! Ez geste ver merda. | **Ay**! Ez ji ber birsîna mirim. |
| **Aferîn**! Ha wina ha! | **Aferîn**! Ha wisa ha! |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Aha**! To dî ey se kerd? | **Aha**! Te dî wî çi kir? |
| **Ax** destê nezanan ra! | **Ax** ji destê nezanan! |
| **Ax li min**! No çi hal o ma tede yê? | **Ax li min**! Ev çi hal e em tê de ne? |
| **Bawo**! Ez serdî ver xeniqîyaya. | **Bawo**! Ez ji ber sermayê xeniqîm. |
| **Çi heyf**! Cîwanîya xo ra xeyr nêdî. | **Çi heyf**! Ji ciwanîya xwe xêr nedît. |
| **Çirr**! O ça nê karî ça! | **Çirr**! Ew li kû ev kar li kû! |
| **Çirt**! Ti eşkenî bikerî? | **Çirt**! Tu dişêyî bikî? |
| **Ço**! Ehmeqo ehmeq. | **Ço**! Ehmeqê ehmeq. |
| **Dayêêê**! Zarê mi teqa. | **Dayêêê**! Ziravê min teqîya. |
| **Deee**! Zor bide ci. | **Deee**! Zorê bide wê. |
| **De biwere**! To dî se bî? | **De bixwe**! Te dî çi bû? |
| **De gidî de**! Ti xo kenî hevalê aye? | **De gidî de**! Tu xwe dikî hevalê wê? |
| **Dêh**! Sey herî zireno. | **Dêh**! Mîna kerî dizire. |
| **Errik**! Çiqas weşik a. | **Errik**! Çiqas weşik e. |
| **Eyy**! De vajîn, ma se kenê? | **Eyy**! De bêjin, em çi dikin? |
| **Eyla**! Mi nêva o yo! | **Lê**! Min negot ew e! |
| **Êêê**! Êdî se bî? | **Êêê**! Êdî çi bû? |
| **Gidî**! No çi hal o? | **Gidî**! Ev çi hal e? |
| **Gijjj**! De bike, ti şênî bikî! | **Gijjj**! De bike, tu dişêyî bikî! |
| **Gunekê**! Yewêko bêkes o. | **Gunekê**! Yekî bêkes e. |
| **Haaa**! Ti ey ra vanî? | **Haaa**! Tu ji wî re dibêjî? |
| **Hah**! Goş de bigîre veramede. | **Hah**! Di guhî re bigire bermede. |
| **Hahûû**! Lete çin o ti nane geyrenî. | **Hahûû**! Kerî tune ye tu li nanê digerî! |
| **Haydê**! Rayîrê xo ra şêrîn! | **Haydê**! Di rêya xwe re herin! |
| **Hela hela**! Karo winasî qet beno? | **Hela hela**! Karê wisa qet dibe? |
| **Hela** xo rê biewnîn se keno! | **Hela** ji xwe re binihêrin çi dike! |
| **Helal**! Eynî sey to bî! | **Helal**! Eynî wek te bû! |
| **Helal bo** to rê! | **Helal be** ji te re! |
| **Herê** ti kotî menda? | **Kerê** tu li kîderê mayî? |
| **Her-herê** ti se kena? | **Kerê-kerê** tu çi dikî? |
| **Hero**, o çi hal o? | **Kero**, ev çi hal e? |
| **Her-hero**, ez to rê nêverdena! | **Her-hero**, ez ji te re nahêlim! |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Hewar**, zuranê to ver! | **Hewar**, ji ber derewên te! |
| **Hewaro**, bêkesî çi zor a! | **Hewaro**, bêkesî çi zor e! |
| Mi çîyê nêkerdo **hewwû**! | Min tiştek nekiriye **hewwû**! |
| **Hey**! Ti uca se kena? | **Hey**! Tu li wir çi dikî? |
| **Heyf**! Werrekina to wina nêkerdêne! | **Heyf**! Xwezîka te wisa nekira! |
| **Heyhat**! Barê ma qelibîya! | **Heyhat**! Barê me qelibî! |
| **Heyret**! Merdim nê karî keno? | **Heyret**! Meriv vî karî dike? |
| **Heywax**! Çi ame ma ser de! | **Heywax**! Çi hat bi ser me de! |
| **Hop**! Cayê xo de vindere! | **Hop**! Li cihê xwe bisekine! |
| **Hopela**! Ti karo nêbîyaye kenî! | **Hopela**! Tu karê nebûyî dikî! |
| **Hoy** ti nêmanî! | **Hoy** tu nemînî! |
| **Hoyş**! Ehmeqo çarling! | **Hoyş**! Ehmeqê çarling! |
| **Laaa**! Mi va, şima bawer nêkerd. | **Lêêê**, min got, we bawer nekir! |
| **Lêê**! Vaje û mevaje! | **Lêê**! Bêje û mebêje. |
| **Lo lo lo**! Ma zaf erey kewtê! | **Lo lo lo**! Em pir dereng mane! |
| **Mîrat**! No wextê xeripîyayîşî bi? | **Mîrat**! Ev wextê xirabûnê bû? |
| **Nêbo ha**! Karo winasî meke! | **Nebe ha**! Karê wisakî meke. |
| **Nêbo nêbo**! Ti hetê ey wa şirî! | **Nebe nebe**! Ti bi alîyê wî ve herî! |
| **Nêwero**! Epa dayê ya? | **Nexwe**! Epa dayê ye? |
| **Nê harê**! Nêşeno nê karî bikero. | **Na harê**! Neşê vî karî bike. |
| **Ox**! Çi welatêko weşik o. | **Ox**! Çi welatekê xweşik e. |
| **Oxeyş**! Zerrîya mi rehet bî. | **Oxeyş**! Dilê min rehet bû. |
| **Oy** no çi bela bi ma dekewtî mîyan? | **Oy** ev çi bela bû em ketin navê? |
| **Pehe**! Hende rindek a. | **Pehe**! Hewçend rindik e. |
| **Pepûg**! Ez do xo rê se bikî? | **Pepûg**! Ez dê ji xwe re çi bikim? |
| **Pizzz**! O nêşeno nê karî bikero. | **Pizzz**! Ew neşê vî karî bike. |
| **Qurr**! O kotî nê karî kotî! | **Qurr**! Ew li kû ev kar li kû! |
| **Riswatî**! To ma rezîl kerdî! | **Riswatî**! Te em rezîl kirin! |
| **Tehe**! Werrekina wina nêkerdêne. | **Tehe**! Xwezîka wisa nekira. |
| **Tew**! De mi dî şima kerd. | **Tew**! De mi dî we kir. |
| **Tew lo**! Tena na kêmî bî. | **Tew lo**! Tenê ev kêm bû. |
| **Tifû**! Taliho sîya. | **Tifû**! Talihê reş. |

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Tirr**! Ti nêresî ci! | **Tirr**! Tu negihî kê! |
| **Tobe**! Ez êdî nêşina uca. | **Tobe**! Ez êdî naçim wir. |
| **Tobe tobe**! No çi kar o? | **Tobe tobe**! Ev çi kar e? |
| **Uff**! Bes o derdê to ra! | **Uff**! Bes e ji derdê te! |
| **Wax bawo**! Çi yeman o! | **Wax bavo**! Çi yeman e! |
| **Wax li min**! Heyfê camêrdan. | **Wax li min**! Heyfa mêran! |
| **Wax wax**! Camêrd perîşan bîyo. | **Wax wax**! Camêr perîşan bûye. |
| **Waayy**! No kam o yeno? | **Waayy**! Ev kî ye dihê? |
| **Wey** qeda piro gino bi nameyê ey ro! | **Wey** qeda lêkeve bi navê wî re! |
| **Wîîî**! Mi o nas nêkerd. | **Wîîî**! Min ew nas nekir. |
| Ez yena **wîy**! Senî nêna! | Ez dihêm **wîy**! Çawa nayêm! |
| **Wuşş**! Çi rîqayîmêk a! | **Wuşş**! Çi rûqayîmek e! |
| **Ya Rebî**! A ma ra çi wazena? | **Ya Rebî**! Ew ji me çi dixwaze? |
| **Yaaa**! Ez vana şima bawer nêkenê. | **Yaaa**! Ez dibêjim, hûn bawer nakin. |
| **Zirr**! Eynî sey herî zireno. | **Zirr**! Eynî wek kerî dizire. |
| **Zirt**! Ti qina xo ser o roniştî? | **Zirt**! Tu li ser qûna xwe rûniştî? |

## KOMELEYA KURDKÎ

Benda yewine ya bernameyê komele, "Seveknayîş û averberdişê ziwanê kurdkî" bî.

Çar merdimî komîteya îdarî ya komele de berpirsîyar bî. Înan ra hîrê kurdê kurmancî û yew zî kurdo kirmanc bi.

Îddîaya înan na bîye ke kurdkî talûke de ya. Coka ganî xo mîyan de bê kurdkî sewbîn ziwan qisey nêkin.

Kombîyayîşê verênî de heme hîrê kurmancan bi kurdkîya kurmanckî qisey kerd û fikrê xo derga-derg beyan kerdî. Ê kirmancî heme qiseykerdişê înan ra fam kerd la ey bi xo nêşena sey înan kurmanckî qisey bikero, coka gama ke dore ameye ey ser, dest pêkerd bi kurdkîya kirmanckî qisey kerd. La hema cumleyê verênî de heme hîrê kurmancan têfek ra mudaxele kerd ke ê ey ra weş fam nêkenê û va semedo ke kurdê kurmancî hîna zaf ê, ganî o zî sey înan bi kurmanckî qisey bikero.

Camêrdî xo ver ro da, waşt îzeh bikero ke ziwanê kurdkî wayîrê çend lehçeyan o, zîyade ferq mîyanê înan de çin o; ganî her kes bi lehçeya xo qisey bikero û qiseykerdoxê lehçeyanê bînan eke nêşenê heme lehçeyan qisey bikerê zî, ganî bişê goşdarîya yewbînî bikerê. La înan qet firsend nêda bi ey. Camêrd mecbûr mend, dest pêkerd, hêrsê xo reyra bi tirkî va:

- Madem winî yo, ma yew zî bi kurdkî qisey nêkenî! Ma heme do tirkî qisey bikin.

Û hemîne dest pêkerd êdî tirkî qisey kerd. Têvernayîş mîyan ra wedarîya! (*)

*Roşan Lezgîn, Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2007, r. 68-69

## KOMELEYA KURDÎ

Benda yekemîn ya bernameya komeleyê "Parastin û pêşdebirina zimanê kurdî" bû.

Çar meriv di komîteya îdarî ya komeleyê de berpirsîyar bûn. Ji wana sisê kurdên kurmanc û yek jî kurdê kirmanc bû.

Îdîaya wan ev bû ku kurdî di xeterê de ye. Lewre divê di nava xwe de bêyî kurdî bi zimanekê din qise nekin.

Di civîna pêşîyê de her sê kurmancan bi kurdîya kurmancî qise kirin û fikrê xwe dûr û dirêj beyan kirin. Ewê kirmanc ji hemî qisekirina wan tê gihîşt lê ew bi xwe neşîya wekî wan bi kurmancî qise bike, lewre gava ku dor hate ser wî, dest pêkir bi kurdîya kirmanckî qise kir. Lê hê di hevoka pêşîyê de her sê kurmancan bi devekî re mudaxele kirin ku ew ji wî baş tê nagihên û gotin, ji ber ku kurdên kurmanc zêdetir in, hingê divê ew jî wek wan bi kurmancî biaxife.

Camêrî li ber xwe da, xwest îzeh bike ku zimanê kurdî xwedîyê çend dîyalektan e, zêde ferq di nava wan de tune ye; divê her kes bi dîyalekta xwe biaxife û axiftvanên dîyalektên din, heke neşên hemî dîyalektan biaxifin jî, divê bişên li hev guhdarî bikin. Lê wan qet firsendê neda wî. Camêr mecbûr ma, dest pêkir, ligel hêrsa xwe bi tirkî got:

- Madem wisa ye, em yek jî bi kurdî qise nakin! Em hemî dê tirkî biaxifin.

Û hemîyan dest pêkir êdî bi tirkî qise kirin. Liberhevdan ji navê rabû!

# 14.HEJMARNAV

Grûpa peyvan ya ku pîvandin, wezinandin û hejmartinê nîşan didin, yanî ew grûpa peyvan ku mesafe, ebad, giranî û mîqdarê nîşan didin bi **hejmarnav** tên nasîn.

Hejmarnav di nav xwe de dibin çar beş:

**1) Hejmarnavên Bingehîn**

**2) Hejmarnavên Parvekirinê**

**3) Hejmarnavên Rêzkî**

**4) Hehjmarnavên Hokerî**

**Hejmarnavên bingehîn** di kirdkî de wisa ne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| yew | yek |
| di (didi) | du (dudu) |
| hîrê | sê (sisê) |
| çar | çar |
| panc | pênc |
| şeş | şeş |
| hewt | heft |
| heşt | heşt |
| new | neh |
| des | deh |
| yewendes / des û yew | yazdeh |
| duwês / des û di | duwazdeh |
| hîrês / des û hîrê | sêzdeh |
| çarês / des û çar | çardeh |
| pancês / des û panc | panzdeh |
| şîyês / des û şeş | şanzdeh |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| hewtês / des û hewt | hevdeh |
| heştês / des û heşt | hejdeh |
| newês / des û new | nozdeh |
| vîst | bîst |
| vîst û ẏew | bîst û yek |
| vîst û di | bîst û du |
| hîris | sih, sî |
| çewres | çil |
| pancas | pêncî |
| şeştî | şêst |
| hewtay | heftê |
| heştay | heştê |
| neway | nod |
| se | sed |
| se û des | sed û deh |
| se û vîst | sed û bîst |
| se û vîst û çar | sed û bîst û çar |
| di seyî | du sed |
| hîrê seyî | sê sed |
| çar seyî | çar sed |
| hezar | hezar |
| di hezarî | du hezar |
| des hezarî | deh hezar |
| vîst hezarî | bîst hezar |
| se hezarî | sed hezar |
| di sey hezarî | du sed hezar |
| mîlyonêk | mîlyonek |
| di mîlyonî | di mîlyonî |

**Hejmarnavên parvekirinê**, ji çend paran parekê yan jî parên ku hatine parvekirin nîşan didin. Di kirdkî de ev hejmarnav bi alîkarîya daçeka "**ra**" çêdibin. Nimûne

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| nîmenîm | nîvenîv |
| çarine ra yew | ji çaran yek |
| desine ra çar | ji dehan çar |
| pancasine ra hewt | ji pêncîyan heft |
| se rå se | ji sedî sed |

**Hejmarnavên rêzkî**, rêza navan nîşan didin. Di kirdkî de bi alîkarîya paşqertafa "-**in**" çêdibin. Paşqertafa mêkîtîyê (-**e**) û paşqertafên pirhejmarîyê (-**î**, -**an**) li pey qertafa "-**in**"ê dihên. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| yewin, -e | yekem / yekemîn |
| pancin, -e | pêncem / pêncemîn |
| desin, -e | dehem / dehemîn |
| vîst û çarin, -e | bîst û çarem / bîst û çaremîn |

Di kirdkî de paşdaçeka rêzkî ya ku hejmarnav digirin û paşdaçeka rêzkî ya ku hoker digrin eynî wekî hev in. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Na reya ver**in** a ke ez yena tîya. | Ev cara pêş**în** e ku ez dihêm vir. |
| Reya ewil**ine** de mi ferq nêkerd. | Di cara ewil**în** de min ferq nekir. |

**Hejmarnavên hokerî**, ji hejmarên ku dubare dibin û di nav hevokê de wezîfeya hokerê dikin re dihê gotin. Hejmarnavên hokerî di kirdkî de bi sê awayan; bi îşareta "**-**", bi bazinqertafa "**-a-**" û bi daçeka "**bi**" dubare dibin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Eke ez bî, *yew-yew* bihûmare. | Heke ez bim *yek-yek* bihejmêre. |
| *Desades* ney *yewayew* ameyî. | *Deh-deh* na yek-yek hatin. |
| *Yew **bi** yew* vejîyayî ameyî. | *Yek **bi** yek* derketin hatin. |

# 15.RADER

Dema ku koka lêkerê û paşqertafek bihên ber hev, bêyî ku rewşa lêkerê bi demê ve girêdayî be, hingê lêker di forma rader de ye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ard + **ene** = ard**ene** | an + **în** = an**în** |
| berd + **ene** = berd**ene** | bir + **in** = bir**in** |
| kerd + **ene** = kerd**ene** | kir + **in** = kir**in** |

Di kirdkî de du tewir paşqertafên raderê hene:

**1) -iş** (**-yîş**, **-îyayîş**)

**2) -ene** (**-yene**)

## 15.1.PAŞQERTAFA "-IŞ" (-YÎŞ / -YAYÎŞ)

Bi vê qertafê ji lêkerê navdêr çêdibin. Di eslê xwe de ev qertaf tenê "-**iş**" e lê dema ku lêker bi herfa bideng (vokal) diqede hingê herfa kelijandinê "**y**" dikeve navberê lewre dibe "**-yîş**", yan jî di hinek lêkerên wekî lêkera "bî**yayîş**" (bû**yîn**) de rader dirêj dibe, şeklê "-**yayîş**" digre. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ard + **iş** = ardiş (n) | an + **în** = anîn |
| berd + **iş** = berdiş (n) | bir + **in** = birin |
| bi + **yayîş** = bîyayîş (n) | bû + **n** = bûn |
| da + **yîş** = dayîş (n) | da + **n** = dan |
| kerd + **iş** = kerdiş (n) | kir + **in** = kirin |
| werd + **iş** = werdiş (n) | xwar + **in** = xwarin |

Ji ber ku bi vê paşqertafa raderê ji lêkerê navdêr çêdibe, lewre

hemî lêkerên hevedudanî bi hev ve dihên nivîsîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| germkerdi**ş** (n) | germkir**in** |
| goşdarîkerdi**ş** (n) | guhdarîkir**in** |
| nanpewti**ş** (n) | nanpeht**in** |
| piradus**îyayîş** (n) | pêvezeliq**în** |
| piroda**yîş** (n) | lêxist**in** |

Taybetîyeka muhîm û sabît jî ev e ku, herçî peyvên ku wisa bi radera "**-iş**", (**-yîş**, **-yayîş**) ji lêkerê çêdibin, hemî nêr in. Me di beşa peyvan (r. 34-35) de jî behs kiribû ku di kirdkî de herçî peyvên ku bi herfa bêdeng diqedin tev nêr in.

## 15.2.PAŞQERTAFA "-ENE" (-YENE)

Paşqertafa "**-yene**" di eslê xwe de "**-ene**" ye. Lê dema ku lêker bi herfa bideng diqede hingê herfa kelijandinê "**y**" dikeve navberê lewre dibe "**-yene**". Bi vê paşqertafê navê lêkerê çêdibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ard + **ene** = ardene | an + **în** = anîn |
| berd + **ene** = berdene | bir + **in** = birin |
| bi + **yene** = bîyene | bû + **yîn** = bûn, bûyîn |
| da + **yene** = dayene | da + **yîn** = dan, dayîn |
| kerd + **ene** = kerdene | kir + **in** = kirin |

Ji ber ku bi vê paşqertafa raderê navê lêkerê çêdibe lewre -lêkerên ku bi preverba yekkîteyî çêdibin ne têde- hemî lêkerên hevedudanî ji hev cihê dihên nivîsîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| germ kerd**ene** | germ kir**in** |
| goşdarî kerd**ene** | guhdarî kir**in** |
| nan pewt**ene** | nan peht**in** |
| pira dus**îyayene** | pê ve zeliq**în** |
| piro da**yene** | lê xist**in** |
| sûr kerd**ene** | sor kir**in** |

# 16.LÊKER

Ji peyvên ku di hevokê de hereket, bûyîn, kirin û rewşê nîşan didin re **lêker** dihê gotin. Eynî wek kurmancî di kirdkî de jî du tewir lêker hene:

**1) Lêkerên Xwerû**

**2) Lêkerên Hevedudanî**

Lêkerên hevedudanî di nav xwe de li ser çend beşan parve dibin.

## 16.1.LÊKERÊN XWERÛ

Lêkerên ku di halê xwe yê xwerû de çêdibin, ji wan re dibêjin **lêkerên xwerû**. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| ardene | anîn |
| berdene | birin |
| eştene | avêtin |
| kerdene | kirin |
| nuştene | nivîsîn |
| wendene | xwendin |

Di kirdkî de hinek lêkerên xwerû yên gerguhêz hene, di raweya dema niha û dema bê de eynî wekî yên kurmancî di rehê wan de guherîn çêdibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| antene | kişandin |
| deştene | dirûtin |
| ditene | dotin |

| | |
|---|---|
| eştene | avêtin |
| liştene | alastin |
| nuştene | nivîsîn |
| pewtene | pehtin |
| riştene | ristin |
| rotene | firotin |
| sentene | wezinandin |
| vatene | gotin |
| viraştene | çêkirin |
| viritene | verişîn |
| vistene | xistin |
| vitene | bêtin |

Em lêkerên jorîn li gor rêzê di her du zaravayan de bi kar bînin:

| | **Dema borî** | **Dema niha** | **Dema bê** |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî**: | Mi ant, -e, -î. | Ez ancena. | Ez do biancî. |
| **Kurmancî**: | Min kişand, -in. | Ez dikişînim. | Ez dê bikişînim. |
| | | | |
| **Kirdkî**: | Mi deşt, -e, -î. | Ez derzena. | Ez do biderzî. |
| **Kurmancî**: | Min dirût, -in. | Ez didirûm. | Ez dê bidirûm. |
| | | | |
| **Kirdkî**: | Mi dite, -î. | Ez doşena. | Ez do bidoşî. |
| **Kurmancî**: | Min dot, -in. | Ez didoşim. | Ez dê bidoşim. |
| | | | |
| **Kirdkî**: | Mi eşt, -e, -î. | Ez erzena. | Ez do bierzî. |
| **Kurmancî**: | Min avêt, -in. | Ez diavêjim. | Ez dê biavêjim. |
| | | | |
| **Kirdkî**: | Mi lişt, -e, -î. | Ez lêsena. | Ez do bilêsî. |
| **Kurmancî**: | Min alast, -in. | Ez dialêsim. | Ez dê bialêsim. |
| | | | |
| **Kirdkî**: | Mi nuşt,-e, -î. | Ez nusena. | Ez do binûsî. |
| **Kurmancî**: | Min nivîsî, -n. | Ez dinivîsim. | Ez dê binivîsim. |

| | Dema borî | Dema niha | Dema bê |
|---|---|---|---|
| Kirdkî: | Mi pewt, -e, -î. | Ez pewjena. | Ez do bipewjî. |
| Kurmancî: | Min peht, -in. | Ez dipêjim. | Ez dê bipêjim. |
| Kirdkî: | Mi rişt, -e, -î. | Ez rêsena. | Ez do birêsî. |
| Kurmancî: | Min rist, -in. | Ez dirêsim. | Ez dê birêsim. |
| Kirdkî: | Mi rot, -e, -î. | Ez roşena. | Ez do biroşî. |
| Kurmancî: | Min firot, -in. | Ez difiroşim. | Ez dê bifiroşim. |
| Kirdkî: | Mi sent, -e, -î. | Ez sencena. | Ez do bisencî. |
| Kurmancî: | Min wezinand, -in. | Ez diwezinînim. | Ez dê biwezinînim. |
| Kirdkî: | Mi vat. | Ez vana. | Ez do bivajî. |
| Kurmancî: | Min got. | Ez dibêjim. | Ez dê bibêjim. |
| Kirdkî: | Mi viraşt, -e, -î. | Ez virazena. | Ez do bivirazî. |
| Kurmancî: | Min çêkir, -in. | Ez çêdikim. | Ez dê çêkim. |
| Kirdkî: | Mi virit, -e, -î. | Ez virêjena. | Ez do bivirêjî. |
| Kurmancî: | Min verişand, -in. | Ez vedireşim. | Ez dê biverêşim. |
| Kirdkî: | Mi vist, -e, -î. | Ez fînena. | Ez do bifînî. |
| Kurmancî: | Min xist, -in. | Ez dixînim. | Ez dê bixînim. |
| Kirdkî: | Mi vitî. | Ez vêjena. | Ez do bivêjî. |
| Kurmancî: | Min bêtin. | Ez dibêjim. | Ez dê bibêjim. |

Çawa ku dixuye, di koka lêkerên her du zaravayan de li gor deman bi awayekî bêîstîqrar guherîn çêdibe. Ev guherîn ne ku tenê aîdê lêkerên gerguhêz e, dibe ku ji ber avanîya lêkerê be. Çunke di kirdkî de lêkerên negerguhêz jî hene ku bi eynî tewirî diguherin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî | |
|---|---|---|
| werîştene | rabûn | |
| | | |
| **Dema borî** | **Dema niha** | **Dema bê** |
| Ez weri**şta**. | Ez wer**zena**. | Ez do biwer**zî**. |
| Ez rabûm. | Ez radibim. | Ez dê rabim. |

**16.2.LÊKERÊN HEVEDUDANÎ**

Lêkerên ku bi alîkarîya preverb, daçek, peyv yan jî lêkereka din çêdibin, jê re dibêjin **lêkerên hevedudanî**. Di kirdkî de lêkerên hevedudanî ev in:

**1) Preverba Yekkîteyî + Lêker**
**2) Preverba Pirkîteyî + Lêker**
**3) Navdêr + Lêker**
**4) Rengdêr + Lêker**
**5) Lêker + Lêker**
**6) Lêkerên Biwêjkî**

**16.2.1.Preverba Yekkîteyî + Lêker**

Divê pêşî em vê îzeh bikin ku di kirdkî de “preverb” guherbar e, hem li pêşîya lêkerê hem li paşîya lêkerê dihê nivîsîn, herwisa hem bi lêkerê ve beste hem jê cihê dihê nivîsîn, lewra preverb ne qertaf in.

Di kirdkî de preverbên yekkîteyî ev in: **a-**, **ci-**, **de-**, **pa-**, **pê-**, **ra-**, **ro-**, **tê-**, **ta-**, **we-**

Di kirdkî de heke preverba yekkîteyî li pêşîya lêkerê bihê nivîsîn bi lêkerê ve beste, ger li paşîya lêkerê bihê nivîsîn, jê cihê dihê nivîsîn. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **a**dayene / **a**dayîş (n) | **ve**dan |
| **a**kerdene / akerdiş (n) | **ve**kirin |
| **a**gêrayene / **a**gêrayîş | **ve**gerîn |
| **ci**gêrayene / **ci**gêrayîş (n) | **lê**gerîn |
| **de**kerdene / **de**kerdiş (n) | **tê**kirin |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| panayene / panayîş (n) | pêvedan |
| pêşanayene / pêşanayîş (n) | lihevxistin (di manaya têkelkirinê de) |
| ravistene / ravistiş (n) | raxistin |
| rokerdene / rokerdiş (n) | rokirin |
| têşanayene / têşanayîş (n) | hêlkirin?/kêlandin/hejandin? |
| tavistene / tavistiş (n) | vêxistin |
| wedartene / wedartiş (n) | hilanîn |

Îcar em van lêkerên ku bi alîkarîya preverba yekheceyî çêbûne di nav hevokê de bikar bîînin û bala xwe bidin ku preverb çawa dişê li dawîya lêkerê jî bihê nivîsîn. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Înan mezel ada/da **a**. | Wan mezel **veda**. |
| Mi ber **akerd/kerd a**. | Min derî **vekir**. |
| Ez **agêrena/gêrena a**. | Ez **vedigerim**. |
| Ez **cigêraya/gêraya ci**. | Ez **lê** gerîyam. |
| To awe **dekerde/kerde de**? | Te av **tê** kir? |
| Ey tifing **pana/na pa**. | Wî tifing **pê** ve da. |
| Aye cew û genim **pêşanayî/şanayî pê**. | Wê ceh û genim **li** hev xistin. |
| Aye kincî **ravistî/vistî ra**. | Wê kinc **raxistin**. |
| To herrî **rokerde/kerde ro**. | Te herî **rokir**. |
| Dapîre derguşe **têşana/şana tê**. | Dapîrê dergûş **hêl** kir/kêland/hejand. |
| To soba **taviste/viste ta**? | Te sobe **vêxist**? |
| Mi kitab **wedart/dart we**. | Min kitêb **hilanî**. |

Dixwazî preverb li pêşîyê be dixwazî li paşîyê be, mana naguhere. Çawa ku dixuye, îmkanên bikarînana lêkerên hevedudanî yên kirdkî nîsbet bi kurmancî zêdetir in û lêkerên kirdkî bêhtir elastîkî ne.

### 16.2.2.Preverba Pirkîteyî + Lêker

Di kirdkî de preverbên pirkîteyî ev in: **cêra**, **cira**, **pede**, **pêro**, **pira**, **piro**, **têra**, **têro**

Dema ku li gel preverba pirkîteyî bi paşqertafa raderê “**-ene** (-**yene**)” navê lêkerê dihê nivîsîn bi awayê ku preverb hertim li pêşîyê be, ji hev cihê dihên nivîsîn. Lê dema ku li gel preverba pirkîteyî bi paşqertafa raderê “**-iş** (-**yîş**/-**yayîş**)” ji lêkerê navdêr çêdibe, hingê preverba pirkîteyî û lêker bi hev ve beste dihên nivîsîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **cêra** kerdene / **cêra**kerdiş (n) | **ji hev** kirin / **jihev**kirin |
| **cira** kerdene / **cira**kerdiş (n) | **jê** kirin / **jê**kirin |
| **pede** kerdene / **pede**kerdiş (n) | **tê de** kirin / **têde**kirin |
| **pêro** dayene / **pêro**dayîş (n) | **li hev** xistin / **lihev**xistin |
| **pira** girewtene / **pira**girewtiş (n) | **li xwe** kirin / **lixwe**kirin |
| **piro** dayene / **piro**dayîş (n) | **lê** xistin / **lê**xistin |
| **têra** kerdene / **têra**kerdiş (n) | **di hev** kirin / **dihev**kirin |
| **têro** piştene / **têro**piştiş (n) | **li hev** pêçan / **lihev**pêçan |

Dibe ku di kirdkî de hemî preverbên pirkîteyî wek preverbên yekkîteyî elastîkî nebin ku hem li pêşî hem li paşîya lêkeran cih bigirin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| To ma **cêra** kerdî / kerdî **cêra**. | Te em **ji hev** kirin. |
| Mi gilo huşk **cira** kerd. | Mi gulîyê hişk **jê** kir. |
| Mi dar **pede** kerd / kerd **pede**. | Mi dar **têde/têre** kir. |
| Înan **pêro** dayo / dayo **pêro**. | Wan **li hev** xistine. |
| Mi kincê xo **pira** girewtî / girewtî **pira**. | Min kincên xwe **li** xwe kirin. |
| Ey **piro** dayo / dayo **piro**. | Wî **lê** xistiye. |
| To lûleyî **têra** kerdî / kerdî **têra**. | Te lûle **di hev re** kirin. |
| Aye nivînê ma **têro** piştî / piştî **têro**. | Wê nivînên me **li hev** pêçan. |

Yanî dibe ku qayîdeya ku ji bo preverbên yekkîteyî heye ji bo preverbên pirkîteyî jî hebe lê xuya ye ku di preverbên pirkîteyî de ev elastîkîyet kêmtir bûye.

**16.2.3.Navdêr + Lêker**

Di kirdkî de jî eynî wekî kurmancî navdêrek û lêkerek dihên ber hev û lêkereka din çêdikin. Eynî wek qayîdeya preverba pirkîteyî, dema ku bi paşqertafa raderê "**-ene** (**-yene**)" navê lêkerê dihê nivîsîn bi awayê ku navdêr hertim li pêşîyê be, ji hev cihê dihên nivîsîn. Lê dema ku li gel navdêrê bi paşqertafa raderê "**-iş** (**-yîş**/**-yayîş**)" ji lêkerê navdêr çêdibe, hingê navdêr û lêker bi hev ve beste dihên nivîsîn. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **aw** dayene / **aw**dayîş (n) | **av** dan / **av**dan |
| **nan** pewtene / **nan**pewtiş (n) | **nan** pehtin / **nan**pehtin |
| **ca** ardene / **ca**ardiş (n) | bi **cih** anîn / bi**cih**anîn |
| **dawet** kerdene / **dawet**kerdiş (n) | **dawet** kirin / **dawet**kirin |
| **qame** eştene / **qame**ştiş (n) | **qam** avêtin / **qam**avêtin |
| **pers** kerdene / **pers**kerdiş (n) | **pirs** kirin / **pirs**kirin |

Em van lêkeran di nav hevokê de bi kar bînin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Babîyê mi baxçe **aw** da. | Bavê min baxçe **av** da. |
| Dadîya mi **nan** pewt. | Dêya min **nan** peht. |
| Mi sozê xo ard **ca**. | Min soza xwe anî **cih**. |
| Înan ez **dawet** kerda. | Wan ez **dawet** kirim. |
| Asmîne emser **qame** eşta. | Asmînê îsal **qam** avêtîye. |
| To înan ra **pers** nêkerd/nêpersa? | Te ji wan **pirs** nekir/nepirsî? |

Îcar jî em wek ku bi alîkarîya paşqertafa raderê (**-iş**/**-yîş**/**-îyayîş**) ku ji lêkerê navdêr çêdike, yanî em wek navdêr bikar bînin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Awdayîş**ê babîyê mi baş o. | **Avdana** bavê min baş e. |
| **Nanpewtiş** karê îsrafî nîyo! | **Nanpehtin** karê îsrafê nîye! |
| Sozî rê **caardiş** lazim o. | Ji sozê re **bicihanîn** lazim e. |
| **Dawetkerdiş** wezîfeyê ma yo. | **Dawetkirin** wezîfeya me ye. |
| **Qameştiş**ê Asmîne lez virazîya. | **Qamavêtin**a Asmînê lez çêbû. |
| Usûlê **perskerdiş**î esto. | Usûla **pirskirin**ê heye. |

### 16.2.4.Rengdêr + Lêker

Eynî wekî kurmancî di kirdkî de jî rengdêrek û lêkerek dihên ber hev û lêkereka nuh çêdikin. Ew qayîdeyên ku ji bo "navdêr + lêker"ê hene eynî wisa ji bo "rengdêr + lêker"ê jî hene. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **berz** kerdene / **berz**kerdiş (n) | **bilind** kirin / **bilind**kirin |
| **derg** kerdene / **derg**kerdiş (n) | **dirêj** kirin / **dirêj**kirin |
| **pak** kerdene / **pak**kerdiş (n) | **paqij** kirin / **paqij**kirin |
| **pîl** kerdene / **pîl**kerdiş (n) | **mezin** kirin / **mezin**kirin |
| **sûr** kerdene / **sûr**kerdiş (n) | **sor** kirin / **sor**kirin |

Em van lêkeran di nav hevokê de bikar bînin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ey destê xo **berz** kerd. | Wî destê xwe **bilind** kir. |
| Ziwanê xo **derg** kerd. | Zimanê xwe **dirêj** kir. |
| Waya mi oda **pak** kerde. | Xwişka min ode **paqij** kir. |
| Kamî ti **pîl** kerdî? | Kê tu **mezin** kirî? |
| Dadîya mi goşt **sûr** kerd. | Dêya min goşt **sor** kir. |

Em wekî ku bi alîkarîya paşqertafa raderê (**-iş**/**-yîş**/**-îyayîş**) ku ji lêkeran navdêran çêdike, van lêkeran wekî navdêr bikar bînin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Berzkerdişê** destî de erey kewt. | Di **bilindkirina** destî de dereng ma. |
| **Dergkerdişê** ziwanî bela yo! | **Dirêjkirina** zimanî bela ye! |
| **Pakkerdiş** sihetî rê baş o. | **Paqijkirin** ji sihetê re baş e. |
| **Pîlkerdiş** karê pîlan o. | **Mezinkirin** karê mezinan e. |
| Boya **sûrkerdişê** goştî yena. | Bêhna **sorkirina** goştî dihê. |

### 16.2.5.Lêker + Lêker

Dîsa eynî wekî kurmancî du lêkerên xwerû dihên ber hev, yanî wek lêkera aktîf û lêkera pasîv dihên ber hev, lêkereka din çêdikin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Karo ke **ameyo kerdene**, baş nîyo! | Karê ku **hatiye kirin**, baş nîye! |
| Çîyo ke kerdo **nêno** vatiş. | Tiştê ku kirîye **nahê gotin**! |
| Înan Ehmed **da girewtene**. | Wan Ehmed **da girtin**. |
| Şima înan **danê kiştene**, se kenê? | Hûn wan **didin kuştin**, çi dikin? |
| Nê vateyan bi ma **medîn vatene**! | Van gotinan bi me **medin gotin**! |
| Heme kitabî bi ma **dayî wendene**. | Hemî kitêb bi me **dan xwendin**. |
| Na mesela baş **yena zanayene**. | Ev mesele baş **dihê zanîn**. |

Divê li vir îzeheteka din bihê kirin ku di kirdkî de ne ku hemî, hinek lêkerên xwerû hene ku dişên bi tena serê xwe jî pasîv bin. Ev xusûsîyet di kurmancî de nîye. Nimûne.

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| No nan **werîyeno / yeno werî**? | Ev nan **dihê xwarin**? |
| Na mesela **zanîyena / yena zanayene**. | Ev mesele **dihê zanîn**. |
| Leşkerê înan **kişîyayî / ameyî kiştene**. | Leşkerên wan **hatin kuştin**. |
| Mesela **vajîyabî / ameybî vatene**. | Mesele **hatibû gotin**. |

Ji bo ke ev taybetîya lêkerên xwerû yên kirdkî bihê zanîn, li dawîya kitêbê li beşa Ferhengoka Lêkerên Xwerû (r. 201-221) binihêrin.

### 16.2.6.Lêkerên Biwêjkî

Di kirdkî de jî eynî wekî kurmancî gelek lêkerên hevedudanî yên biwêjkî (îdyomkî) jî hene. Ew qayîdeyên ku ji bo "navdêr + lêker" û "rengdêr + lêker"ê hene ku me li jor qal kir, eynî wisa ji bo "lêkerên biwêjkî" jî derbas dibin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| dest **pêkerd**ene / destpê**kerdiş** (n) | dest pê **kir**in / destpê**kirin** |
| dest **eşt**ene / deste**şt**iş (n) | dest **avêt**in / dest**avêt**in |
| fek **eşt**ene / fek**eşt**iş (n) | dev **avêtin** / dev**avêt**in |
| goş nê**da**yene / goşnê**da**yîş (n) | guh ne**da**yîn / guhne**dan** |
| xo ver o **da**yene / xovero**da**yîş (n) | ji ber xwe ve **dan** / jiberxweve**dan** |
| xo ver de **da**yene / xoverde**da**yîş (n) | li ber xwe **da**yîn / liberxwe**dan** |

Em van lêkeran di nav hevokê de bikar biînin:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Mi **dest pêkerd**, nuşt. | Min **dest pê kir**, nivîsî. |
| Aye **dest eşt** heme çî. | Wê **dest avêt** hemî tiştî. |
| Aye bîlasebeb **fek eşt** ey! | Wê bîlasebeb **dev avêt** wî! |
| Ey kitạbî **xo ver o dayî.** | Wî kitêb **ji ber xwe ve dan**. |
| Kurdênê, **xo ver ro bidîn**! | Kurdîno, **li ber xwe bidin!** |

Em wekî ku bi alîkarîya paşqertafa raderê (**-iş/-yîş/-îyayîş**) ku ji lêkerê navdêr çêdike, van lêkerên biwêjkî wekî navdêr bikar biînin:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Destpêkerdiş** nêmeyê serkewtişî yo. | **Destpêkirin** nîvê serketinê ye. |
| **Desteştiş**ê bi hetkarîye baş o. | **Destavêtin**a bi alîkarîyê baş e. |
| Xo **fekeştiş** ra dûrî bide! | Xwe ji **devavêtinê** dûr bide. |
| **Xoverodayîş** karê fehm kerdene yo. | **Jiberxwevedan** karê fêm kirinê ye. |
| **Xoverrodayîşê** Asmîne hew beno. | **Liberxwedan**a Asmînê hew dibe. |

## 16.3.ERGATÎVÎ

Ji elementên hevokê kirde û bireser li ser kişandina lêkerê tesîrê dikin. Lê di hin zimanan de kişandina lêkerê tenê li gor kirdeyê ye. Ji van zimanan re dibêjin **zimanên akuzatîv**. Lêbelê hinek ziman jî hene, hemû lêkerên gerguhêz li gor bireserê dihên kişandin ku ji wan re jî dibêjin **zimanên ergatîv.**

Zimanên ergatîv jî di nav xwe de dibin di grûp:

**a)** Grûpek jê, hemî lêkerên gerguhêz li gor bireserê dihên kişandin. Ji van zimanan re dibêjin **zimanên tam-ergatîv**.

**b)** Hinek jî hene ku tenê di hin raweyên deman de li gor bireserê dihên kişandin ku ji van re jî dibêjin **zimanên nîv-ergatîv**.

Kirdkî û kurmancî di grûpa **zimanên nîv-ergatîv** de ne. Çunke lêkerên gerguhêz di raweya *dema niha* û *dema bê* de li gor kirdeyê, di raweya *demên borî* û raweya *çîrokîya her sê deman* de li gor bireserê dihên kişandin. Yanî formul ev e, di lêkerên gerguhêz de kirde tim di halê tewandî de bireser di halê xwerû de ye. Lê di lêkerên negerguhêz de kirde tim di halê xwerû de îcar bireser di halê tewandî de ye. Ji vî layî ve her du zarava jî xwedîyê eynî taybetmendîyê ne.

## 16.4.LÊKERA GERGUHÊZ

Karê ku dişê bireser (obje) bigire pêvebera wî dibe **lêkera gerguhêz**. Di lêkera gerguhêz (transîtîv) de bersiva pirsên mîna "çi?", "çawa?", "kê?" heye. Yanî di lêkerên gerguhez de, karê ku kirde dike, li ser kesek yan tiştekî tesîrê dike. Di kirdkî de bi awayê nêrîtî, mêkîtî û pirhejmarîyê kişandina lêkerê bi bireserê ve eleqedar e. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Mi kitabî wendî. (zh) | Mi kitêb xwendin. (kitêb: ph) |
| Ey saye werde. (m) | Wî sêv xwar. (sêv: yh) |
| Aye nan werd. (n) | Wê nan xwar. (nan: yh) |
| Înan awe şimite. (m) | Wan av vexwar. (av: yh) |
| Ma engure werde. (m) | Me tirî xwar. (tirî: yh) |
| Şima murîyî werdî. (zh) | We hirmî xwarin. (hirmî: ph) |

Di kirdkî de, ji ber ku peyv di halê xwe yê xwerû de jî nêrîtî, mêkîtî û pirhejmarîya xwe dîyar e, lewre peyvên mê û pirhejmar paşqertafa xwe didin pêvebera xwe jî. Yanî pêveber li gor bireserê qertafa kişandinê digire; biresera mê paşqertafa mêkîtîyê "**-e**" dide pêveberê û biresera pirhejmar jî paşqertafa halê xwerû "**-î**" dide pêveberê.

Di lêkerên gereguhêz de, di raweya dema niha û dema bê de kirde di halê xwerû de bireser di halê tewandî de ye. Lê di demên borî û çîrokîya deman de kirde di halê tewandî de bireser di halê xwerû de ye. Nimûne:

***Dema borî***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmedî (ey) nan werd. (n) | Ehmedî (wî) nan xwar. (n) |
| Ehmedî (ey) nane werde (m) | Ehmedî (wî) nanê xwar. (m) |
| Ehmedî (ey) nanî werdî. (zh) | Ehmedî (wî) nan xwarin. (ph) |
| Zelale (aye) nan werd. (n) | Zelalê (wê) nan xwar. (n) |
| Zelale (aye) nane werde. (m) | Zelalê (wê) nanê xwar. (m) |
| Zelale (aye) nanî werdî. (n) | Zelalê (wê) nan xwarin. (ph) |

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Wendekar**an** (înan) nan werd. (n) | Xwendekar**an** (wan) nan xwar. (n) |
| Wendekar**an** (înan) nane werde. (zh) | Xwendekar**an** (wan) nan**ê** xwar. (m) |
| Wendekar**an** (înan) nan**î** werd**î**. (zh) | Xwendekar**an** (wan) nan xwar**in**. (ph) |

Di cihnavan de wisa dibe:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Mi **xo** dî. | Min **xwe** dît. |
| Mi **ti** dî. (n) | Min **tu** dît. (n m) |
| Mi **ti** dî**ye**. (m) | Min **tu** dît. (n m) |
| Mi **o** dî. (m) | Min **ew** dît. (n m) |
| Mi **a** dî**ye**. (m) | Min **ew** dît. (n m) |
| Mi **ma** dî**yî**. (zh) | Min **em** dît**in**. (ph) |
| Mi **şima** dî**yî**. (zh) | Min **hûn** dît**in**. (ph) |
| Mi **ê** dî**yî**. (zh) | Min **ew** dît**in**. (ph) |
| | |
| Ey **xo** dî. | Wî **xwe** dît. |
| Ey **ez** dî**ya**. (m) | Wî **ez** dît**im**. |
| Ey **ti** dî. (n) | Wî **tu** dît. (n m) |
| Ey **ti** dî**ye**. (m) | Wî **tu** dît. (n m) |
| Ey **o** dî. (m) | Wî **ew** dît. (n m) |
| Ey **a** dî**ye**. (m) | Wî **ew** dît. (n m) |
| Ey **ma** dî**yî**. (zh) | Wî **em** dît**in**. (ph) |
| Ey **şima** dî**yî**. (zh) | Wî **hûn** dît**in**. (ph) |
| Ey **ê** dî**yî**. (zh) | Wî **ew** dît**in**. (ph) |
| | |
| Aye **xo** dî. | Wê **xwe** dît. |
| Aye **ez** dî**ya**. (m) | Wê **ez** dît**im**. |
| Aye **ti** dî. (n) | Wê **tu** dît. (n m) |
| Aye **ti** dî**ye**. (m) | Wê **tu** dît. (n m) |
| Aye **o** dî. (m) | Wê **ew** dît. (n m) |
| Aye **a** dî**ye**. (m) | Wê **ew** dît. (n m) |
| Aye **ma** dî**yî**. (zh) | Wê **em** dît**in**. (ph) |
| Aye **şima** dî**yî**. (zh) | Wê **hûn** dît**in**. (ph) |
| Aye **ê** dî**yî**. (zh) | Wê **ew** dît**in**. (ph) |

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ma **xo** dî. | Me **xwe** dît. |
| Ma **ez dîya**. (m) | Me **ez** dît**im**. |
| Ma **ti** dî. (n) | Me **tu** dît. (n m) |
| Ma **ti dîye**. (m) | Me **tu** dît. (n m) |
| Ma **o** dî. (m) | Me **ew** dît. (n m) |
| Ma **a** dî**ye**. (m) | Me **ew** dît. (n m) |
| Ma **şima** dîy**î**. (zh) | Me **hûn** dît**in**. (ph) |
| Ma **ê** dîy**î**. (zh) | Me **ew** dît**in**. (ph) |
| | |
| Şima **xo** dî. | We **xwe** dît. |
| Şima **ez** dî**ye**. (m) | We **ez** dît**im**. |
| Şima **o** dî. (n) | We **ew** dît. (n m) |
| Şima **a** dî**ye**. (m) | We **ew** dît. (n m) |
| Şima **ma** dîy**î**. (zh) | We **em** dît**in**. (ph) |
| Şima **ê** dîy**î**. (zh) | We **ew** dît**in**. (ph) |
| | |
| Înan **xo** dî. | Wan **xwe** dît. |
| Înan **ez** dî**ya**. (m) | Wan **ez** dît**im**. |
| Înan **ti** dî. (n) | Wan **tu** dît. (n m) |
| Înan **ti** dî**ye**. (m) | Wan **tu** dît. (n m) |
| Înan **o** dî. (m) | Wan **ew** dît. (n m) |
| Înan **a** dî**ye**. (m) | Wan **ew** dît. (n m) |
| Înan **ma** dîy**î**. (zh) | Wan **em** dît**in**. (ph) |
| Înan **şima** dîy**î**. (zh) | Wan **hûn** dît**in**. (ph) |
| Înan **ê** dîy**î**. (zh) | Wan **ew** dît**in**. (ph) |

***Dema niha***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed (o) nan wen**o**. (n) | Ehmed (ew) nanî dixw**e**. (n) |
| Zelale (a) nan wen**a**. (m) | Zelal (ew) nanî dixw**e**. (m) |
| Wendekarî (ê) nan wen**ê**. (zh) | Xwendekar (ew) nanî dixw**in**. (ph) |

Çawa ku dixuye, di kirdkî de taybetîya (nêrîtî û mêkîtî) ku peyv di halê xwe yê xwerû de nîşan dide, eynî wisa tesîrê li kişandina pêveberê jî dike. Lê di kurmancî de tenê di halê pirhejmarîyê de pêveber li gor pirhejmarîyê (-**in**) dihê kişandin.

Di cihnavan de wisa dibe:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Ez** xo vînena. (m) | **Ez** xwe dibîn**im**. (?) |
| **Ez** ey vînena. (m) | **Ez** wî dibîn**im**. (?) |
| **Ez** aye vînena. (m) | **Ez** wê dibîn**im**. (?) |
| **Ez** ma vînena. (m) | **Ez** we dibîn**im**. (?) |
| **Ez** şima vînena. (m) | **Ez** wan dibîn**im**. (?) |
| **Ez** înan vînena. (m) | **Ez** wan dibîn**im**. (?) |
| | |
| **O** xo vîneno. (n) | **Ew** xwe dibîne. (n) |
| **O** mi vîneno. (n) | **Ew** min dibîne. (n) |
| **O** to vîneno. (n) | **Ew** te dibîne. (n) |
| **O** to vîneno. (n) | **Ew** te dibîne. (n) |
| **O** ma vîneno. (n) | **Ew** me dibîne. (n) |
| **O** şima vîneno. (n) | **Ew** we dibîne. (n) |
| **O** înan vîneno. (n) | **Ew** wan dibîne. (n) |
| | |
| **A** xo vînena. (m) | **Ew** xwe dibîne. (m) |
| **A** mi vînena. (m) | **Ew** min dibîne. (m) |
| **A** to vînena. (m) | **Ew** te dibîne. (m) |
| **A** to vînena. (m) | **Ew** te dibîne. (m) |
| **A** ma vînena. (m) | **Ew** me dibîne. (m) |
| **A** şima vînena. (m) | **Ew** we dibîne. (m) |
| **A** înan vînena. (m) | **Ew** wan dibîne. (m) |
| | |
| **Ma** xo vînenê. (zh) | **Em** xwe dibîn**in**. (ph) |
| **Ma** mi vînenê. (zh) | **Em** min dibîn**in**. (ph) |
| **Ma** to vînenê. (zh) | **Em** te dibîn**in**. (ph) |
| **Ma** to vînenê. (zh) | **Em** te dibîn**in**. (ph) |
| **Ma** şima vînenê. (zh) | **Em** we dibîn**in**. (ph) |
| **Ma** înan vînenê. (zh) | **Em** wan dibîn**in**. (ph) |

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Şima** xo vînenê. (zh) | **Hûn** xwe dibî**nin**. (ph |
| **Şima** mi vînenê. (zh) | **Hûn** min dibî**nin**. (ph) |
| **Şima** ê vînenê. (zh) | **Hûn** wî dibî**nin**. (ph) |
| **Şima** aye vînenê. (zh) | **Hûn** wê dibî**nin**. (ph) |
| **Şima** ma vînenê. (zh) | **Hûn** me dibî**nin**. (ph) |
| **Şima** înan vînenê. (zh) | **Hûn** wan dibî**nin**. (ph) |
| | |
| **Ê** xo vînenê. (zh) | **Ew** xwe dibî**nin**. (ph) |
| **Ê** mi vînenê. (zh) | **Ew** min dibî**nin**. (ph) |
| **Ê** to vînenê. (zh) | **Ew** te dibî**nin**. (ph) |
| **Ê** to vînenê. (zh) | **Ew** te dibî**nin**. (ph) |
| **Ê** ma vînenê. (zh) | **Ew** me dibî**nin**. (ph) |
| **Ê** şima vînenê. (zh) | **Ew** we dibî**nin**. (ph) |

Çawa ku ji nimûneyan jî dîyar dibe di her du zaravayan de sîstema ergatîvîyê eynî wekî hev e. Furmul ev e: **Ger kirde di halê xwerû de be bireser di halê tewandî de ye, ger kirde di halê tewandî de be îcar bireser di halê xwerû de ye. Pêveber jî tim li gor elementa ku di halê xwerû de ye dihê kişandin**; yanî ger kirde di halê xwerû de be pêveber li gor kirdeyê dihê kişandin, ger bireser di halê xwerû de be, îcar li gor bireserê dihê kişandin.

Ji bo cihnavên "**ma**" (em/me) û "**şima**" (hûn/we) yên kirdkî, li beşa **Cihnavan** (r. 66-70) binihêrin ku me li wir gotibû ku ev her du cihnavên kirdkî hem di halê xwerû de hem di halê tewandî de tim eynî ne.

## 16.5.LÊKERÊN NEGERGUHÊZ

Karê ku neşê bireser (obje) bigire pêvebera wî dibe **lêkera negerguhêz**. Di lêkerên negerguhez de, karê ku kirde dike, li ser tiştekî din tesîrê nake.. Di kirdkî de, di lêkerên negerguhêz de kişandina lêkeran ji alîyê nêrîtî, mêkîtî û pirhejmarîyê ve rasetrast bi kirdeyê ve eleqedar e. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Cam şikîyay**o**. | Cam şikîyaye. |
| Awe rijîyay**a**. | Av rijîyaye. |
| Sayî pelixîyay**ê**. | Sêv pelixî**ne**. |

| | |
|---|---|
| Nimûneyeka din: | |
| Ehmed şîy**o**. | Ehmed çûye. |
| Zelale şîy**a**. | Zelal çûye. |
| Karkerî şîy**ê**. | Karker çû**ne**. |

Li vir ger em derheqê forma hin lêkeran de hinek melûmat bidin dê baş be. Mesela, lêkera "zanayene" (zanîn) di hin devokan de wisa dihê bikarînan.

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Ehmed zano/zan**en**/zan**eno**/zan**enone**. | Ehmed dizan**e**. |
| Zelale zana/zan**en**/zan**ena**/zan**enane**. | Zelal dizan**e**. |
| Karkerî zanê/zan**en**/zan**enê**/zan**enêne**. | Karker dizan**in**. |

Dibe ku formên dirêj formên kevin bin û her ku çûbe kintir bûne. Lê balkêş e ku di qertafa kişandina lêkerên her du zaravayan de nêzîkîyek heye. Îhtîmal e formên kevin yek bûne, bi demê re guherîne.

## 16.6.LÊKERA NÎVCO (KOPULA)

Eynî wekî kurmancî di kirdkî de jî lêkerek heye ku temam nîye, nîvco ye. Di kirdkî de jî eynî wekî kurmancî ev lêker ji cihnav, bireser û navdêran cihê dihê nivîsîn. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| "O kam **o**?" "O Roşan **o**." | "Ew kî **ye**?" "Ew Roşan **e**." |
| "A kam **a**?" "A Asmîn **a**." | "Ew kî **ye**?" "Ew Asmîn **e**." |
| "Ê kam **ê**?" "Ê malim **ê**." | "Ew kî **ne**? "Ew malim **in**." |

Di kirdkî de karê nîvco yê neyînî bi pêşqertafa neyînîyê "**nê-**" çêdibe. Lê dema ku herfa kelijandinê "**y**" li dû dengê "**ê**" dihê, hingê ev deng dibe "**î**". Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| "O kam **o**?" "O Roşan **nîyo**." | "Ew kî **ye**?" "Ew Roşan **nîne**." |
| "A kam **a**?" "A Asmîne **nîya**." | "Ew kî **ye**?" "Ew Asmîn **nîne**." |
| "Ê kam **ê**?" "Ê malim **nîyê**." | "Ew kî **ne**? "Ew malim **nînin**." |

Di lêkera nîvco ya erênî de paşqertafa navdêrên mê (-**e**) û paşqertafa pirhejmarîyê ya halê xwerû (-**î**) winda dibin. Lê di lêkera nîvco ya halê neyînî de winda nabin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **gule** (m) | **gul** (m) |
| "A gul **a**?" "A gul**e** nîya." | "Ew gul **e**?" "Ew gul nîne." |
| **zimbêlî** (zh) | **simbêl** (ph) |
| "Ê zimbêl **ê**?" "Ê zimbêl**î** nîyê." | "Ew simbêl in?" "Ew simbêl nînin." |

## 16.7.LÊKERA NÎVCO: "BÎYENE/BÎYAYÎŞ"

Ev lêkera nîvco, yanî kopula wekî "bîyene/bîyayîş" jî heye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| "O kam **bi**?" "O Roşan **bi**." | "Ew kî **bû**?" "Ew Roşan **bû**." |
| "A kam**e** **bî**?" "A Asmîn**e** **bî**." | "Ew kî **bû**?" "Ew Asmîn **bû**." |
| "Ê kam**î** **bî**?" "Ê malim**î** **bî**." | "Ew kî **bûn**? "Ew malim **bûn**." |

Di lêkera nîvco ya wekî "bîyene/bîyayîş" de, dixwazî bila lêkera nîvco erênî yan neyînî be, ferq nake, peyvên mê û pirhejmar paşqertafên xwe diparêzin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| "O kam **bi**?" "O Roşan nê**bi**." | "Ew kî **bû**?" "Ew Roşan ne**bû**." |
| "A kam**e** **bî**?" "A Asmîn**e** nê**bî**." | "Ew kî **bû**?" "Ew Asmîn ne**bû**." |
| "Ê kam**î** **bî**?" "Ê malim**î** nê**bî**." | "Ew kî **bûn**? "Ew malim ne**bûn**." |

## 16.9.LÊKERÊN ALÎKAR

Di kirdkî de jî eynî wekî kurmancî hinek lêker hene, alîkarîyê

dikin ku lêkereka din çêbibe, ji van re dibêjin **lêkera alîkar**. Ji ber ku lêkera alîkar di rewşa aktîf de ye, lewre di her du zaravayan de ew dihê kişandin.

Di kirdkî de hinek lêkerên alîkar ev in:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **ameyene** | **hatin** |
| **dayene** | **dan** |
| **kerdene** | **kirin** |
| **şayene** | **şîyan / kanîn / karin** |
| **waştene** | **xwestin** |
| **zanayene** | **zanîn** |

Ji van lêkera "**amayene**" li gor raweya deman diguhere.

**16.9.1.ameyene**: hatin

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| No nan yen**o** werdene. | Ev nan dihê xwarin. |
| Na say**e** yen**a** werdene. | Ev sêv dihê xwarin. |
| Nê say**î** yen**ê** werdene. | Ev sêv dihê**n** xwarin. |

**16.9.2.dayene**: dayîn

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ey ti **day**î girewtene. | Wî tu **day**î girtin. |
| A do ey bi**do** kiştene. | Ew dê wî bi**de** kuştin. |
| Ê sayan bi ma nê**danê** werdene. | Ew sêvan bi me na**din** xwarin. |

**16.9.3.kerdene**: kirin

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Kerd** ke bivajo la nêşa. | **Kir** ku bibêje lê neşîya. |
| **Kerdêne** ke binuso, la nêzana. | Di**kir** ku binivîse, lê nizanî. |

**16.9.4.şayene**: şîyan / kanîn / karin

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| O **şêno** biyero? | Ew di**şê** / di**kane** / di**kare** were? |
| A nê**şêna** biyera. | Ew ne**şê** / ni**kane** / ni**kare** were. |
| Ê **şênê** bivajê. | Ew di**şên** / **dikanin** / **dikarin** bibêjin. |

**16.9.5.waştene**: xwestin/xwastin

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| **Waşt** bido la nêdî. | **Xwest** bide lê nedî[t]. |
| **Waşt** binuso la nêzana. | **Xwest** binivîse lê nizanî. |
| **Wazenê** bivajê la nêzanê. | **Dixwazin** bibêjin lê nizanin. |

**16.9.6.zanayene**: zanîn

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| **Zano** bivajo la înad keno. | **Dizane** bibêje lê înad dike. |
| **Zana** bivaja la nêvana. | **Dizane** bibêje lê nabêje. |
| **Zanê** biwanê la nêwanenê! | **Dizanin** bixwînin lê naxwînin. |

### 16.10.RAWEYA FERMANÊ

Di kirdkî de raweya fermanê ya erênî (pozîtîv) eynî wekî kurmancî bi pêşqertafa "**bi-**" çêdibe. Raweya fermanî ya neyînî (negatîv) jî hertim bi pêşqertafa "**me-**" çêdibe. Di eslê xwe de ya kurmancî jî eynî wisa ye. Lê hinek kurmanc hene di cihê pêşqertafa rewayeya fermanî ya neyînî "**me-**"yê de "**ne-**"yê bi kar diînin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| Dersa xo **bi**wane. | Dersa xwe **bi**xwîne. |
| Karê xirabî **meke**! | Karê xirab **meke/neke**! |
| **Me**şo verê berê înan! | **Meçe/neçe** ber derîyê wan! |
| Ey rê **me**berme, xo rê **bi**berme. | Ji wî re **me**girî/**ne**girî, ji xwe re **bi**girî. |

# KOMUNÎSTÎYE

Cinîya ey merdibî. Keye de çinbîyayîşê cinî ra êdî perîşan bibi. Pa çar domananê hurdîyan, wina vîya û mîyanê hezar zehmetîyan de cuya xo vîyarnayne. Nat û wet çimê xo çarnayne ke goreyê xo ra yew cinî peyda bikero la hetanî nika çîyê hasil nêkerdibi. Her roje badê ke kar ra agêrayne keye, gureyê keyeyî kerdêne, dima ra şîyêne qewexane de roniştêne û nas û dostan rê derdê xo vatêne ke belkî ey rê ardim bikerê, cayê ra salixê yew cinîya goreyê ey bidê.

Yew cinîya embiryana ey zî vîya bî. Çend rey teklîf kerdibi ke a cinîke ey reyde bizewijîya. Zerrîya aye zî estibî la tersê lajê xo yê komunîstî ra vatêne "ney!"

Welat de zafê telebeyan bîbî komunîstî û wendiş ra vêşêr sîyaset kerdêne. Wina komik bi komike pêresayne, yew name nayne xo wa û seba ke xo rê terefdaran peyda bikerê mîyanê şarî de, vêşêr zî qewexaneyan de propaganda kerdêne. Nê komunîstan wexto ke veng dayne yewbînî, vatêne "yoldaş!"

Şan de hewna grûbêk komunîstî ameyî qewexane. Çi kesê ke qewexane de estbî dorê xo de kom kerdî û lajê a cinîya vîyaye sey serekê înan bi vengêkê cidî dest bi qiseykerdiş kerd, va:

- Ma komunîst ê. Ma wazenê komunîzmî bîyarê nê welatî. Çunke komunîzm seyyewbînanbîyayîş o, edalet o... Rejîmê komunîstîye de her çî seyyewbînan pare beno. Yew embiryan mird yew vêşan nêbeno. Seke yoldaş Lenîn vano, ma komunîstan nika ra dest pêkerdo, kamî het çi vêşî estbo, ma ey ra gênê danê çinbîyayeyî!

Lajekî bi heraret qisey kerdêne. Çi vatêne, heme ro weşa camêrdê vîyayî şîyêne. Tu çîyêdo nemunasib tede nêdî. Camêrd bi heyecan qîrra, va:

- Yoldaş! Tîya ra pey ez zî komunîst a. Ez zî partîya şima ra ya!

Zaf keyfê komunîstê ciwanî û embazanê ey ame ke sayeyê ajîtasyonê ey de komika înan yew komunîsto newe qezenc kerdo.

Axir peynî de şarê qewexaneyî bi vila. Camêrdî zî sey komunîstêkê neweyî xo da kaleka xortê embiryanê xo yê komunîstî û pîya ver bi kuçeyê xo kewtî rayîr. Kuçe teng-tarî û xewle bi. Gama ke ameyî nêzdîyê keyeyanê xo û êdî yewbînî ra xatir waştêne, camêrd fetilîya komunîstê ciwanî ser, seke lavey bikero, va:

- Yoldaş! To dî, to qewexane de va "Kamî het çi vêşî bibo, ma ey ra gênê danê çinbîyayeyî!" Ti ha zanî, ez bê cinî ya. Dadîya to zî bi çend serrî ke vîya ya. Eke ti musade bikî, ez û a ma bizewij...

Labelê hema ke camêrdî vatişê xo temam nêkerdbi, komunîstê ciwanî kulma xo şidêna û da fekê ey ro. Gonî û didanê ey ê ke şikîyayî fek ra rijîyayî!

*Roşan Lezgîn, Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul, 2007, r. 59-60

# KOMUNÎSTÎ

Jina wî miribû. Ji ber nebûna jinekê ya li mal êdî perîşan bûbû. Bi çar zarokên hûr ve, wisa bî û di nav hezaran zehmetîyan de jiyana xwe dibihurand. Virde wêde çavê xwe lê digerand ku li gor xwe jinekê bibîne lê heta bi niha tiştek hasil nekiribû. Her rojê piştî ku ji kar vedigerîya malê, karê malê dikir, dû re diçû li qehwexaneyê rûdinişt û ji nas û dostan re derdê xwe digot ku belkî jê re alîkarîyê bikin, ji cihekê salixên jineka li gora wî bidin.

Jineke cîrana wî jî bî bû. Çend caran lê teklîf kiribû ku ew jinik pê re bizewice. Dilê jinikê jî hebû lê ji ber tirsa lawê xwe yê komunîst digot "na!"

Li welat gelek xwendevan bûbûn komunîst û ji xwendinê zêdetir sîyaset dikir. Wisa komik bi komik digîhan hev, navek li xwe dikir û ji bo ku ji xwe re terefdaran çêkin di nava gel de, bêhtir jî li qehwexaneyan propaganda dikirin. Van komunîstan dema ku deng li hev dikirin digotin "yoldaş" (hevrê).

Êvarê dîsa grûpek komunîst hat qehwexaneyê. Çi kesên ku di qehwexaneyê de hebûn li dora xwe kom kirin û lawê wê jinika bî wek serekê wan bi dengekê cidî dest bi axiftinê kir, got:

- Em komunîst in. Em dixwazin komunîzmê bînin vî welatî. Çunke komunîzm wekhevî ye, edalet e... Di rejîma komunîstîyê de her tişt wekhev parve dibe. Cîranek têr yek birçî nabe. Her wekî ku yoldaş Lenîn dibêje, me komunîstan ji niha ve dest pêkirîye, li ber kê çi tiştê zêde hebe, em jê distînin didin yê ku li ber tune ye!

Lawik bi heraret diaxifî. Çi digot, giş bi camêrê bî xweş bû. Tu tiştekî nemunasib tê de nedît. Camêr bi heyecan qîrîya, got:

- Yoldaş! Ji vir û şûn de ez jî komunîst im. Ez jî ji partîya we me!

Gelek keyfa komunîstê ciwan û hevalên wî hate ku bi saya ajîtasyona wî komika wan komunîstekê nuh qezenc kiriye.

Axir di dawîyê de qewexane belav bû. Camêr jî wek komunîstê nuh xwe da kêleka xortê cîranê xwe yê komunîst û bi hev re ber bi kuçeya xwe ve bi rê ketin. Kuçe teng-tarî û xewle bû. Gava ku hatin nêzîkî malên xwe û êdî ji yek û din xatir dixwestin, camêr fetilî ser komunîstê ciwan ve, mîna ku laveyan bike, got:

- Yoldaş! Te dî, te li qehwexaneyê got "Li ber kê çi tiştê zêde hebe, em jê distînin didin yê ku li ber tune ye!" Tu va dizanî, ez bê jin im. Diya te jî bû çend sal ku bî ye. Heke tu destûr bidî, ez û ew em bizewic...

Lêbelê hê ku camêrî gotina xwe temam nekiribû, komunîstê ciwan kulma xwe şidand û di dev de lêxist. Xwînê û diranên wî yên ku şikîyan ji devê wî rijîyan!

# 17.DI LÊKERAN DE RAWE

**Rawe**, li gor deman şeklê ku lêker bi reha xwe yan jî bi girtina pêşqertaf û paşqertafan nîşan dide re dihê gotin. Ji bo ku rawe fêm bibe, divê dem bihên zanîn. Di kirdkî de sê demên bingehîn hene:

1) **Dema Niha**
2) **Dema Borî**
3) **Dema bê**

Ev demên bingehîn jî di nav xwe de dabeş dibin. Em dê bi dorê bala xwe bidin ser.

## 17.1.DEMA NIHA

**Dema niha**, manaya xwe ev e ku kar niha dibe, bûyîna karî dewam dike. Ev dem jî di nav xwe de dibe sê beş:

1) **Dema niha ya nedîyar**
2) **Dema niha ya dîyar**
3) **Çîrokîya dema niha**

Di raweya dema niha de kirde di halê xwerû de ye. Ger lêker gerguhêz be bireser dihê tewandin. Di kurmancî de pêvebera vê demê hertim bi pêşqertafa "**di-**" çêdibe. Lê ev pêşqertaf di kirdkî de tune ye. Di hinek halên neyînîya vê raweya kurmancî de ev daçek winda dibe lê di çîrokîya dema niha de xwe muhafeze dike.

Taybetîyeka din jî ev e, li her du zaravayan di raweya dema niha de koka lêkerê diguhere; yan hinek deng bi tevayî winda dibin yan jî cihê xwe didin dengine din.

Heçî kirdkî ye, di raweya dema niha de dengên dawîn yên koka lêkerê diguherin dibin "**n**" yan jî "**en**". Lê di çîrokîya dema niha de koka lêkerê naguhere.

**17.1.1.Dema niha ya nedîyar**, ew dem e ku kar dibe lê dema xwe fireh e. Ji vê demê çend nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **kewt**ene | **ketin [kevtin]** |
| Ehmed kew**eno**. (n) | Ehmed **dikeve**. (yh) |
| Asmîne kew**ena**. (m) | Asmîn **dikeve**. (yh) |
| Wendekarî kew**enê**. (zh) | Xwendekar **dikevin**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmed **nê**kew**eno**. (n) | Ehmed **nakeve**. (yh) |
| Asmîne **nê**kew**ena**. (m) | Asmîn **nakeve**. (yh) |
| Wendekarî **nê**kew**enê**. (zh) | Xwendekar **nakevin**. (ph) |

Di cihnavan de:

| | |
|---|---|
| **Ez** kew**ena**. (m) | **Ez dikevim**. (?) |
| **Ti** kew**enî**. (n) | **Tu dikevî**. (yh) |
| **Ti** kew**ena**. (m) | **Tu dikevî**. (yh) |
| **O** kew**eno**. (n) | **Ew dikeve**. (yh) |
| **A** kew**ena**. (m) | **Ew dikeve**. (yh) |
| **Ma** kew**enê**. (zh) | **Em dikevin**. (ph) |
| **Şima** kew**enê**. (zh) | **Hûn dikevin**. (ph) |
| **Ê** kew**enê**. (zh) | **Ew dikevin**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| **Ez nê**kew**ena**. (m) | **Ez nakevim**. (?) |
| **Ti nê**kew**enî**. (n) | **Tu nakevî**. (yh) |
| **Ti nê**kew**ena**. (m) | **Tu nakevî**. (yh) |
| **O nê**kew**eno**. (n) | **Ew nakeve**. (yh) |
| **A nê**kew**ena**. (m) | **Ew nakeve**. (yh) |
| **Ma nê**kew**enê**. (zh) | **Em nakevin**. (ph) |
| **Şima nê**kew**enê**. (zh) | **Hûn nakevin**. (ph) |
| **Ê nê**kew**enê**. (zh) | **Ew nakevin**. (ph) |

| Zarava | Dema niha ya nediyar | Dema niha ya diyar | Çîrokiya dema niha |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî** | **Ez** xo fînena. (m) | **Ez** ha xo fînena. (m) | Mi **xo** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Ez** xwe **dixînim** | **Ez** va xwe **dixînim.** | Min **xwe dixist.** |
| **Kirdkî** | **Ez** to fînena. (m) | **Ez** ha to fînena. (m) | Mi **ti** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Ez** te **dixînim** | **Ez** va te **dixînim.** | Min **tu dixist.** |
| **Kirdkî** | **Ez** ey fînena. (m) | **Ez** ha ey fînena. (m) | Mi **o** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Ez** wî **dixînim.** | **Ez** va wî **dixînim** | Min **ew dixist.** |
| **Kirdkî** | **Ez** aye fînena. (m) | **Ez** ha aye fînena. (m) | Mi **a** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Ez** wê **dixînim.** | **Ez** va wê **dixînim** | Min **ew dixist.** |
| **Kirdkî** | **Ez** ma fînena. (m) | **Ez** ha ma fînena. (m) | Mi **ma** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Ez** me **dixînim.** | **Ez** va me **dixînim** | Min **em dixistin** |
| **Kirdkî** | **Ez** şima fînena. (m) | **Ez** ha şima fînena (m) | Mi **şima** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Ez** we **dixînim.** | **Ez** va we **dixînim.** | Min **hûn dixistin** |
| **Kirdkî** | **Ez** înan fînena. (m) | **Ez** ha înan fînena. (m) | Mi **ê** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Ez** wan **dixînim** | **Ez** va wan **dixînim.** | Min **ew dixistin** |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî** | **Ti** xo fînenî, **-a.** (n m) | **Ti** ha xo fînenî, **-a.** (n m) | To **xo** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Tu** xwe **dixînî.** | **Tu** va xwe **dixînî.** | Te **xwe dixist.** |
| **Kirdkî** | **Ti** ey/aye fînenî. (n) | **Ti** ha ey/aye fînenî. (n) | To **o/a** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Tu** wî/wê **dixînî.** | **Tu** va wî/wê **dixînî.** | Te **ew dixist** |
| **Kirdkî** | **Ti** ey/aye fînena. (m) | **Ti** ha ey/aye fînena. (m) | To **o/a** vistêne. |
| **Kurmancî** | **Tu** wî/wê **dixînî.** | **Tu** va wî/wê **dixînî.** | Te **ew dixist.** |
| **Kirdkî** | **Ti** ma/şima/înan fînenî. (n) | **Ti** ha ma/şima/înan fînenî. (n) | To **ma/şima/ê** vistêne |
| **Kurmancî** | **Tu** wan/me/we **dixînî.** | **Tu** va wan/me/we **dixînî** | Te **em/hûn/we dixistin** |
| **Kirdkî** | **Ti** ma/şima/înan fînena. (m) | **Ti** ha ma/şima/înan fînena. (m) | To **ma/şima/ê** vistêne |
| **Kurmancî** | **Tu** me/we/wan **dixînî** | **Tu** va me/we/wan **dixînî.** | Te **em/hûn/we dixistin.** |

| Zarava | Dema niha ya nediyar | Dema niha ya diyar | Çîrokîya dema niha |
|---|---|---|---|
| Kirdkî | O xo fîneno. (n) | O ha xo fîneno. (n) | Ey xo vistêne. |
| Kurmancî | Ew xwe dixîne. | Ew va xwe dixîne. | Wî xwe dixist. |
| Kirdkî | O ey/aye fîneno. (n) | O ha ey/aye fîneno. (n) | Ey o/a vistêne |
| Kurmancî | Ew wî/wê dixîne. | Ew va wî/wê dixîne. | Wî ew dixist. |
| Kirdkî | O ma/şima/înan fîneno. (n) | O ha ma/şima/înan fîneno. (n) | Ey ma/şima/ê vistêne. |
| Kurmancî | Ew me/we/wan dixîne | Ew va me/we/wan dixîne. | Wî em/hûn/ew dixistin |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Kirdkî | A xo fînena. (m) | A ha xo fînena. (m) | Aye xo vistêne |
| Kurmancî | Ew xwe dixîne. | Ew va xwe dixîne. | Wê xwe dixist. |
| Kirdkî | A ey/aye fînena. (m) | A ha ey/aye fînena. (m) | Aye o/a vistêne. |
| Kurmancî | Ew wî/wê dixîne. | Ew va wî/wê dixîne. | Wê ew dixist. |
| Kirdkî | A ma/şima/înan fînena (m) | A ha ma/şima/înan fînena. (m) | Aye ma/şima/ê vistêne. |
| Kurmancî | Ew me/we/wan dixînî | Ew va me/we/wan dixînî. | Wê em/hûn/ew dixistin |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Kirdkî | Ma xo fînenê. (zh) | Ma ha xo fînenê. (zh) | Ma xo vistêne. |
| Kurmancî | Em xwe dixînin. (ph) | Em va xwe dixînin. (ph) | Me xwe dixist. |
| Kirdkî | Ma ey/aye fînenê. (zh) | Ma ha ey/aye fînenê. (zh) | Ma o/a vistêne. |
| Kurmancî | Em wî/wê dixînin. (ph) | Em va wî/wê dixînin. (ph) | Me ew dixist. |
| Kirdkî | Ma şima/înan fînenê (zh) | Ma ha şima/înan fînene. (zh) | Ma şima/ê vistêne. |
| Kurmancî | Em me/we/wan dixînin. (ph) | Ew va me/we/wan dixînin. (ph) | Me em/hûn/ew dixistin. |

| | | | |
|---|---|---|---|
| Kirdkî | Ê xo fînenê. (zh) | Ê ha xo fînenê. (zh) | Înan xo vistêne. |
| Kurmancî | Ew xwe dixînin. (ph) | Ew va xwe dixînin. (ph) | Wan xwe dixist. |
| Kirdkî | Ê ey/aye fînenê. (zh) | Ê ha ey/aye fînenê. (zh) | Înan o/a vistêne. |
| Kurmancî | Ew wî/wê dixînin. (ph) | Ew va wî/wê dixînin. (ph) | Wan ew dixistin |
| Kirdkî | Ê ma/şima/înan fînenê. (zh) | Ê ha ma/şima/înan fînenê. (zh) | Înan ma/şima/ê vistêne |
| Kurmancî | Ew me/we/wan dixînin. (ph) | Ew va me/we/wan dixînin. (ph) | Wan em/hûn/ew dixistin |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **kerdene** | **kirin** |
| Ehmed **keno**. (n) | Ehmed **dike**. (yh) |
| Asmîne **kena**. (m) | Asmîn **dike**. (yh) |
| Wendekarî **kenê**. (zh) | Xwendekar **dikin**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmed **nêkeno**. (n) | Ehmed **nake**. (yh) |
| Asmîne **nêkena**. (m) | Asmîn **nake**. (yh) |
| Wendekarî **nêkenê**. (ph) | Xwendekar **nakin**. (ph) |

Di cihnavan de:

| | |
|---|---|
| **Ez** kena. (m) | **Ez dikim**. (?) |
| **Ti** kenî. (n) | **Tu dikî**. (yh) |
| **Ti** kena. (m) | **Tu dikî**. (yh) |
| **O** keno. (n) | **Ew dike**. (yh) |
| **A** kena. (m) | **Ew dike**. (yh) |
| **Ma** kenê. (zh) | **Em dikin**. (ph) |
| **Şima** kenê. (zh) | **Hûn dikin**. (ph) |
| **Ê** kenê. (zh) | **Ew dikin**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| **Ez nêkena**. (m) | **Ez nakim**. (?) |
| **Ti nêkenî**. (n) | **Tu nakî**. (yh) |
| **Ti nêkena**. (m) | **Tu nakî**. (yh) |
| **O nêkeno**. (n) | **Ew nake**. (yh) |
| **A nêkena**. (m) | **Ew nake**. (yh) |
| **Ma nêkenê**. (zh) | **Em nakin**. (ph) |
| **Şima nêkenê**. (zh) | **Hûn nakin**. (ph) |
| **Ê nêkenê**. (zh) | **Ew nakin**. (ph) |

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| **şîyene** | **çûyîn** |
| Ehmed **şino**. (n) | Ehmed **diçe**. (yh) |
| Asmîne **şina**. (m) | Asmîn **diçe**. (yh) |
| Wendekarî **şinê**. (zh) | Xwendekar **diçin**. (ph) |
| Neyînîya wê: | |
| Ehmed **nêşino**. (n) | Ehmed **naçe**. (yh) |
| Asmîne **nêşina**. (m) | Asmîn **naçe**. (yh) |
| Wendekarî **nêşinê**. (zh) | Xwendekar **naçin**. (ph) |
| Di cihnavan de: | |
| **Ez şina**. (m) | **Ez diçim**. (?) |
| **Ti şinî**. (n) | **Tu diçî**. (yh) |
| **Ti şina**. (m) | **Tu diçî**. (yh) |
| **O şino**. (n) | **Ew diçe**. (yh) |
| **A şina**. (m) | **Ew diçe**. (yh) |
| **Ma şinê**. (zh) | **Em diçin**. (ph) |
| **Şima şinê**. (zh) | **Hûn diçin**. (ph) |
| **Ê şinê**. (zh) | **Ew diçin**. (ph) |
| Neyînîya wê: | |
| **Ez nêşina**. (m) | **Ez naçim**. (?) |
| **Ti nêşinî**. (n) | **Tu naçî**. (yh) |
| **Ti nêşina**. (m) | **Tu naçî**. (yh) |
| **O nêşino**. (n) | **Ew naçe**. (yh) |
| **A nêşina**. (m) | **Ew naçe**. (yh) |
| **Ma nêşinê**. (zh) | **Em naçin**. (ph) |
| **Şima nêşinê**. (zh) | **Hûn naçin**. (ph) |
| **Ê nêşinê**. (zh) | **Ew naçin**. (ph) |

Derheqê vê demê de ji bo kirdkî ev jî bihê îzehkirin baş dibe. Di lêkerên gerguhêz de ger biresera nêr dîyar nebe, paşqertafa te-

wangê "-î"yê nagire. Lê ger bireser dîyar be, hingê paşqertafa tewangê "-î"yê digre. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed **goşt** roşeno. (n) | Ehmed **goşt** difiroşe. (n) |

Di vê nimûneyê de bireser ne dîyar e, herwisa dema kar jî ne dîyar e. Dîsa, dibe ku karê Ehmedî "goştfirotin" be. Me gotibû ku peyvên mê hertim qertafa xwe ya mêkîtîyê "**-e**" muhafeze dikin. Lê ger bireser peyveka nêr be û dîyar be, hingê qertafa "**-î**" ya tewangê digre. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed goşt**î** roşeno. (n) | Ehmed goşt**î** difiroşe. (n) |

**17.1.2.Dema niha ya dîyar**, dihê vê manayê ku kar di demeka ber dest de va ye dibe. Û di her du zaravayan de eynî wekî hev bi alîkarîya partîkelek û lêkereka nîvco çêdibe. Partîkela kirdkî tim "**ha**" ye, lê di kurmancî de ji bo nêzik "**va**", ji bo dûr jî "**wa**" ye (ji bo vê partîkelê li r. 111 binihêre). Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| nu**ş**tene | **nivîsîn** |
| Ehmed **ha yo** nuse**no**. (n) | Ehmed **va/wa ye di**nivîse. (yh) |
| Asmîne **ha ya** nuse**na**. (m) | Asmîn **va/wa ye di**nivîse. (yh) |
| Wendekar**î** **ha yê** nuse**nê**. (zh) | Xwendekar **va/wa ne di**nivîsin. (ph) |

Neyînîya wê:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed **ha yo nê**nuse**no**. (n) | Ehmed **va/wa ye na**nivîse. (yh) |
| Asmîne **ha ya nê**nuse**na**. (m) | Asmîn **va/wa ye na**nivîse. (yh) |
| Wendekar**î** **ha yê nê**nuse**nê**. (zh ) | Xwendekar **va/wa ne na**nivîsin. (ph) |

| | |
|---|---|
| **ş**îyene | **çû**yîn |
| Ehmed **ha yo** şi**no**. (n) | Ehmed **va/wa ye di**çe. (yh) |
| Asmîne **ha ya** şi**na**. (m) | Asmîn **va/wa ye di**çe. (yh) |
| Wendekar**î** **ha yê** şi**nê**. (zh) | Xwendekar **va/wa ne di**çin. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmed **ha yo nêşino**. (n) | Ehmed **va/wa** ye **naçe**. (yh) |
| Asmîne **ha ya nêşina**. (m) | Asmîn **va/wa** ye **naçe**. (yh) |
| Wendekarî **ha yê nêşinê**. (zh) | Xwendekar **va/wa ne naçin**. (ph) |

Di cihnavan de:

| | |
|---|---|
| **Ez** ha kewena. (m) | **Ez** va/wa **dikevim**. |
| **Ti** ha kewenî. (n) | **Tu** va/wa **dikevî**. (yh) |
| **Ti** ha kewena. (m) | **Tu** va/wa **dikevî**. (yh) |
| **O** ha keweno. (n) | **Ew** va/wa **dikeve**. (yh) |
| **A** ha kewena. (m) | **Ew** va/wa **dikeve**. (yh) |
| **Ma** ha kewenê. (zh) | **Em** va/wa **dikevin**. (ph) |
| **Şima** ha kewenê. (zh) | **Hûn** va/wa **dikevin**. (ph) |
| **Ê** ha kewenê. (zh) | **Ew** va/wa **dikevin**. (ph) |

Di kirdkî de ev partîkel û karê nîvco carînan digihên hev û wisa dihên gotin:

**ha yo** (n) wekî **ho** (n)

**ha ya** (m) wekî **ha** (m)

**ha yê** (zh) wekî **hê** (zh)

Mesela, di kurmancîya Behdînanê de jî ev partîkel wekî vê qayîdeya kirdkî di nêrîtî, mêkîtî û pirherjmarîyê de ji hev cihê bûye. Yanî "**ê/wê/yê**" nêr, "**a/wa/ya**" mê û "**êt/wêt/yêt**" pirhejmar çêdibe. Lê di kirdkî de gelekê caran bêyî lêkera nîvco, di her sê halan de jî tenê wekî "**ha**" dihê gotin. Ev di kurmancî de jî wisa dibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **kewt**ene | **ket**in |
| Ehmed **ha** keweno. | Ehmed **va/wa** dikeve. |
| Asmîne **ha** kewena. | Asmîn **va/wa** dikeve. |
| Wendekarî **ha** kewenê. | Xwendekar **va/wa** dikevin. |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **şîyene** | **çûyîn** |
| Ehmed **ha** şino. | Ehmed **va/wa** diçe. |
| Asmîne **ha** şina. | Asmîn **va/wa** diçe. |
| Wendekarî **ha** şinê. | Xwendekar **va/wa** diçin. |

**17.1.3.Çîrokîya dema niha**, dihê vê manayê ku, wekî rawe di dema niha ya demeka bihurî de çêbûye. Ev dema kirdkî di halê nêrîtî, mêkîtî û pirhejmarîyê de tim bi koka lêkerê ku paşqertafa raderê negirtîye û bi peşqertafa "**-êne**" (**-yêne**) çêdibe. Di her du zaravayan de jî di lêkera negerguhêz de kirde hertim di halê xwerû de ye. Lê di lêkera gerguhêz de kirde di halê tewandî de bireser di halê xwerû de ye.

Di lêkera negerguhêz de:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **kewt**ene | **ket**in |
| Ehmed kewt**êne**. | Ehmed **di**ket. (yh) |
| Asmîne kewt**êne**. | Asmîn **di**ket. (yh) |
| Wendekarî kewt**êne**. | Xwendekar **diketin**. (ph) |

Neyînîya wê:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Ehmed **nê**kewt**êne**. | Ehmed **ne**diket. (yh) |
| Asmîne **nê**kewt**êne**. | Asmîn **ne**diket. (yh) |
| Wendekarî **nê**kewt**êne**. | Xwendekar **nediketin**. (ph) |

Di cihnavan de:

| | |
|---|---|
| **Ez** kewt**êne**. | **Ez diketim**. (?) |
| **Ti** kewt**êne**. | **Tu diketî**. (yh) |
| **O** kewt**êne**. | **Ew diket**. (yh) |

| | |
|---|---|
| A **kewtêne**. | **Ew diket**. (yh) |
| **Ma** kewtêne. | **Em diketin**. (ph) |
| **Şima** kewtêne. | **Hûn diketin**. (ph) |
| **Ê** kewtêne. | **Ew diketin**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| **Ez nêkewtêne**. | **Ez nediketim**. (?) |
| **Ti nêkewtêne**. | **Tu nediketî**. (yh) |
| **O nêkewtêne**. | **Ew nediket**. (yh) |
| **A nêkewtêne**. | **Ew nediket**. (yh) |
| **Ma nêkewtêne**. | **Em nediketin**. (ph) |
| **Şima nêkewtêne**. | **Hûn nediketin**. (ph) |
| **Ê nêkewtêne**. | **Ew nediketin**. (ph) |

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **şîyene** | **çûyîn** |
| Ehmed **şiyêne**. | Ehmed **diçû**. (yh) |
| Asmîne **şiyêne**. | Asmîn **diçû**. (yh) |
| Wendekarî **şiyêne**. | Xwendekar **diçûn**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmed **nêşiyêne**. | Ehmed **nediçû**. |
| Asmîne **nêşiyêne**. | Asmîn **nediçû**. |
| Wendekarî **nêşiyêne**. | Xwendekar **nediçûn**. |

Di cihnavan de:

| | |
|---|---|
| **Ez şiyêne**. | **Ez diçûm**. (?) |
| **Ti şiyêne**. | **Ti diçûyî**. (yh) |
| **O şiyêne**. | **Ew diçû**. (yh) |
| **A şiyêne**. | **Ew diçû**. (yh) |
| **Ma şiyêne**. | **Em diçûn**. (ph) |
| **Şima şiyêne**. | **Hûn diçûn**. (ph) |
| **Ê şiyêne**. | **Ew diçûn**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| **Ez nêşiyêne.** | **Ez nediçûm.** (?) |
| **Ti nêşiyêne.** | **Ti nediçûyî.** (yh) |
| **O nêşiyêne.** | **Ew nediçû.** (yh) |
| **A nêşiyêne.** | **Ew nediçû.** (yh) |
| **Ma nêşiyêne.** | **Em nediçûn.** (ph) |
| **Şima nêşiyêne.** | **Hûn nediçûn.** (ph) |
| **Ê nêşiyêne.** | **Ew nediçûn.** (ph) |

Di lêkera gerguhêz de:

| | |
|---|---|
| **werdene** | **xwarin** |
| Ehmedî saye **werdêne.** | Ehmedî **sêv dixwar.** (sêv: yh) |
| Ehmedî sayî **werdêne.** | Ehmedî **sêv dixwarin.** (sêv: ph) |
| Asmîne saye **werdêne.** | Asmînê **sêv dixwar.** (sêv: yh) |
| Asmîne sayî **werdêne.** | Asmînê **sêv dixwarin.** (sêv: ph) |
| Wendekar**an** saye **werdêne.** | Xwendekar**an sêv dixwar.** (sêv: yh) |
| Wendekar**an** sayî **werdêne.** | Xwendekar**an sêv dixwarin.** (sêv: ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| **werdene** | **xwarin** |
| Ehmedî saye **nêwerdêne.** | Ehmedî **sêv nedixwar.** (sêv: yh) |
| Ehmedî sayî **nêwerdêne.** | Ehmedî **sêv nedixwarin.** (sêv: ph) |
| Asmîne saye **nêwerdêne.** | Asmînê **sêv nedixwar.** (sêv: yh) |
| Asmîne sayî **nêwerdêne.** | Asmînê **sêv nedixwarin.** (sêv: ph) |
| Wendekar**an** saye **nêwerdêne.** | Xwendekar**an sêv nedixwar.** (sêv: yh) |
| Wendekar**an** sayî **nêwerdêne.** | Xwendekar**an sêv nedixwarin.** (sêv: ph) |

Di cihnavan de:

| | |
|---|---|
| Mi saye **werdêne.** | Mi **sêv dixwar.** (sêv: yh) |
| Mi sayî **werdêne.** | Mi **sêv dixwarin.** (sêv: ph) |
| To saye **werdêne.** | Te **sêv dixwar.** (sêv: yh) |

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
| --- | --- |
| To sayî werdêne. | Te **sêv dixwarin**. (sêv: ph) |
| Ey saye werdêne. | Wî **sêv dixwar**. (sêv: yh) |
| Ey sayî werdêne. | Wî **sêv dixwarin**. (sêv: ph) |
| Aye saye werdêne. | Wê **sêv dixwar**. (sêv: yh) |
| Aye sayî werdêne. | Wê **sêv dixwarin**. (sêv: ph) |
| Ma sayî werdêne. | Me **sêv dixwar**. (sêv: yn) |
| Ma sayî werdêne. | Me **sêv dixwarin**. (sêv: ph) |
| Şima saye werdêne. | We **sêv dixwar**. (sêv: yh) |
| Şima sayî werdêne. | We **sêv dixwarin**. (sêv: ph) |
| Înan saye werdêne. | Wan **sêv dixwar**. (sêv: yh) |
| Înan sayî werdêne. | Wan **sêv dixwarin**. (sêv: ph) |
| | |
| Neyînîya wê: | |
| Mi saye **nêwerdêne**. | Mi **sêv nedixwar**. (sêv: yh) |
| Mi sayî **nêwerdêne**. | Mi **sêv nedixwarin**. (sêv: ph) |
| To saye **nêwerdêne**. | Te **sêv** *ne***dixwar**. (sêv: yh) |
| To sayî **nêwerdêne**. | Te **sêv nedixwarin**. (sêv: ph) |
| Ey saye **nêwerdêne**. | Wî **sêv nedixwar**. (sêv: yh) |
| Ey sayî **nêwerdêne**. | Wî **sêv nedixwarin**. (sêv: ph) |
| Aye saye **nêwerdêne**. | Wê **sêv nedixwar**. (sêv: yh) |
| Aye sayî **nêwerdêne**. | Wê **sêv nedixwarin**. (sêv: ph) |
| Ma saye **nêwerdêne**. | Me **sêv nedixwar**. (sêv: yh) |
| Ma sayî **nêwerdêne**. | Me **sêv nedixwarin**. (sêv: ph) |
| Şima saye **nêwerdêne**. | We **sêv nedixwar**. (sêv: yh) |
| Şima sayî **nêwerdêne**. | We **sêv nedixwarin**. (sêv: ph) |
| Înan saye **nêwerdêne**. | Wan **sêv nedixwar**. (sêv: yh) |
| Înan sayî **nêwerdêne**. | Wan **sêv nedixwarin**. (sêv: ph) |

### 17.2.DEMA BORÎ

**Dema borî**, manaya xwe ev e ku kar hatiye kirin, temam bûye. Ev dem di nav xwe de li ser sê beşan parve dibe:

**1) Dema borî ya dîyar**
**2) Dema borî ya nedîyar**
**3) Çîrokîya dema borî**

Ji bo ku kirdkî û kurmancî her du jî tewangbar in, lewre du halên lêkerê hene; yanî halê xwerû û halê tewandî yê lêkerê. Di lêkerên gerguhêz û negerguhêz de cihnav diguherin. Dîsa, bi vê ve girêdayî kirde, bireser û lêker jî paşqertafên nêrîtî, mêkîtî û pirhejmarîyê digrin.

**17.2.1.Dema borî ya dîyar**, manaya xwe ev e ku kar temam bûye û dîyar e. Di raweya vê demê de ger lêker negerguhêz be kirde di halê xwerû de ye, lêker jî di halê ku paşqertafa raderê negirtiye de ye, di kirdkî de tenê paşqertafa mêkîtî û pirhejmarîyê digre. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **kewt**ene | **ket**in |
| Ehmed kewt. (n) | Ehmed ket. (yh) |
| Asmîn**e** kewt**e**. (m) | Asmîn ket. (yh) |
| Wendekar**î** kewt**î**. (zh) | Xwendekar **ketin** (ph). |
| | |
| Neyînîya wê: | |
| Ehmed **nê**kewt. | Ehmed **ne**ket. (yh) |
| Asmîn**e** **nê**kewt**e**. | Asmîn **ne**ket. (yh) |
| Wendekar**î** **nê**kewt**î**. | Xwendekar **neketin**. (ph) |
| | |
| Di cihnavan de: | |
| **Ez** kewt**a**. (m) | **Ez** ket**im**. (?) |
| **Ti** kewt**î**. (n) | **Tu** ket**î**. (yh) |
| **Ti** kewt**a**. (m) | **Tu** ket**î**. (yh) |
| **O** kewt. (n) | **Ew** ket. (yh) |
| **A** kewt**e**. (m) | **Ew** ket. (yh) |
| **Ma** kewt**î**. (zh) | **Em** ket**in**. (ph) |
| **Şima** kewt**î**. (zh) | **Hûn** ket**in**. (ph) |
| **Ê** kewt**î**. (zh) | **Ew** ket**in**. (ph) |

Di lêkera gerguhêz de kirde di halê tewandî de ye, bireser di halê xwerû de ye, lêker li gor bireserê dihê kişandin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmedî **gule** viste. (m) | Ehmedî **gul** xist. (gul: yh) |
| Ehmedî **gulî** vistî. (m) | Ehmedî **gul** xistin. (gul: ph) |
| Asmîne **texte** vist. (n) | Asmînê **texte** xist. (texte: yh) |
| Asmîne **texteyî** vistî. (zh) | Asmînê **texte** xistin. (texte: ph) |
| Wendekaran **kitab** wend. (n) | Xwendekaran **kitêb** xwend. (kitêb: yh) |
| Wendekaran **kitabî** wendî. (zh) | Xwendekaran **kitêb** xwendin. (kitêb: ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmedî **gule nêviste**. (m) | Ehmedî **gul nexist**. (gul: yh) |
| Ehmedî **gulî nêvistî**. (m) | Ehmedî **gul nexistin**. (gul: ph) |
| Asmîne **texte nêvist**. (n) | Asmînê **texte nêxist**. (texte: yh) |
| Asmîne **texteyî nêvistî**. (zh) | Asmînê **texte nexistin**. (texte: ph) |
| Wendekaran **kitab nêwend**. (n) | Xwendekaran **kitêb nexwend**. (kitêb: yh) |
| Wendekaran **kitabî nêwendî**. (zh) | Xwendekaran **kitêb nexwendin**. (kitêb: ph) |

**17.1.2.Dema borî ya nedîyar**, manaya xwe ev e ku kar bûye lê dîyar nîye; dema xwe fireh e. Di raweya vê demê de jî ger lêker negerguhêz be kirde di halê xwerû de ye. Pêveber li gor nêrîtî, mêkîtî û pirhejmarîya kirdeyê dihê kişandin. Nimûne:

| **kewtene** | **ketin** |
|---|---|
| Ehmed kewto. (n) | Ehmed ketiye. (yh) |
| Asmîne kewta. (m) | Asmîn ketiye. (yh) |
| Wendekarî kewtê. (zh) | Xwendekar ketine. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmed **nêkewto**. (n) | Ehmed **neketiye**. (yh) |
| Asmîne **nêkewta**. (m) | Asmîn **neketiye**. (yh) |
| Wendekarî **nêkewtê**. (zh) | Xwendekar **neketine**. (ph) |

| Zarava | Dema borî ya dîyar | Dema borî ya nedîyar | Çîrokîya dema borî |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî** | Mi **xo** vist. (n) | Mi **xo** visto. (n) | Mi **xo** vistibi. (n) |
| **Kurmancî** | Min **xwe** xist. | Min **xwe** xistiye | Min **xwe** xistibû. |
| **Kirdkî** | Mi **ti** vistî. (n) | Mi **ti** vistê. (n) | Mi **ti** vistibî. (n) |
| **Kurmancî** | Min **tu** xistî. (n m) | Min **tu** xistiye. (n m) | Min **tu** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Mi **ti** viste. (m) | Mi **ti** vista. (m) | Mi **ti** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | Min **tu** xistî. (n m) | Min **tu** xistiye. (n m) | Min **tu** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Mi **o** vist. (n) | Mi **o** visto. (n) | Mi **o** vistibi. (n) |
| **Kurmancî** | Min **ew** xist. (n m) | Min **ew** xistiye. (n m) | Min **ew** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Mi **a** viste. (m) | Mi **a** vista. (m) | Mi **a** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | Min **ew** xist. (n m) | Min **ew** xistiye. (n m) | Min **ew** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Mi **ma** vistî. (zh) | Mi **ma** vistê. (zh) | Mi **ma** vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | Min **em** xistin. (ph) | Min **em** xistine. (ph) | Min **em** xistibûn. (ph) |
| **Kirdkî** | Mi **şima** vistî. (zh) | Mi **şima** vistê. (zh) | Mi **şima** vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | Min **hûn** xistin. (ph) | Min **hûn** xistine. (ph) | Min **hûn** xistibûn. (ph) |
| **Kirdkî** | Mi **ê** vistî. (zh) | Mi **ê** vistê. (zh) | Mi **ê** vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | Min **ew** xistin. (ph) | Min **ew** xistine. (ph) | Min **ew** xistibûn. (ph) |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî** | Ey **xo** vist. (n) | Ey **xo** visto. (n) | Ey **xo** vistibi. (n) |
| **Kurmancî** | Wî **xwe** xist. | Wî **xwe** xistiye. | Wî **xwe** xistibû |
| **Kirdkî** | Ey **ez** vista. (m) | Ey **ez** vista. (m) | Ey **ez** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | Wî **ez** xistim. | Wî **ez** xistime. | Wî **ez** xistibûm. |
| **Kirdkî** | Ey **ti** vistî. (n) | Ey **ti** vistê. (n) | Ey **ti** vistibî. (n) |
| **Kurmancî** | Wî **tu** xistî. (n m) | Wî **tu** xistiye. (n m) | Wî **tu** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Ey **ti** vista. (m) | Ey **ti** vista. (m) | Ey **ti** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | Wî **tu** xistî. (n m) | Wî **tu** xistiye. (n m) | Wî **tu** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Ey **o** vist. (n) | Ey **o** visto. (n) | Ey **o** vistibi. (n) |
| **Kurmancî** | Wî **ew** xist. (n m) | Wî **ew** xistiye. (n m) | Wî **ew** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Ey **a** viste. (m) | Ey **a** vista. (m) | Ey **a** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | Wî **ew** xist. (n m) | Wî **ew** xistiye. (n m) | Wî **ew** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Ey **ma** vistî. (zh) | Ey **ma** vistê. (zh) | Ey **ma** vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | Wî **em** xistin. (ph) | Wî **em** xistine. (ph) | Wî **em** xistibûn. (ph) |
| **Kirdkî** | Ey **şima** vistî. (zh) | Ey **şima** vistê. (zh) | Ey **şima** vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | Wî **hûn** xistin. (ph) | Wî **hûn** xistine. (ph) | Wî **hûn** xistibûn. (ph) |
| **Kirdkî** | Ey **ê** vistî. (zh) | Ey **ê** vistê. (zh) | Ey **ê** vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | Wî **ew** xistin. (ph) | Wî **ew** xistine. (ph) | Wî **ew** xistibûn. (ph) |

| Zarava | Dema borî ya dîyar | Dema borî ya nedîyar | Çîrokîya dema borî |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî** | Aye **xo** vist. (n) | Aye **xo** visto. (n) | Aye **xo** vist**ibi**. (n) |
| **Kurmancî** | Wê **xwe** xist. | Wê **xwe** xist**iye**. | Wê **xwe** xist**ibû**. |
| **Kirdkî** | Aye **ez** vista. (m) | Aye **ez** vista. (m) | Aye **ez** vist**ibî**. (m) |
| **Kurmancî** | Wê **ez** xist**im**. | Wê **ez** xist**ime**. | Wê **ez** xist**ibûm**. |
| **Kirdkî** | Aye **ti** vistî. (n) | Aye **ti** vistê. (n) | Aye **ti** vist**ibî**. (n) |
| **Kurmancî** | Wê **tu** xistî. (n m) | Wê **tu** xist**iye**. (n m) | Wê **tu** xist**ibû**. (n m) |
| **Kirdkî** | Aye **ti** vista. (m) | Aye **ti** vista. (m) | Aye **ti** vist**ibî**. (m) |
| **Kurmancî** | Wê **tu** xistî. (n m) | Wê **tu** xist**iye**. (n m) | Wê **tu** xist**ibû**. (n m) |
| **Kirdkî** | Aye **o** vist. (n) | Aye **o** visto. (n) | Aye **o** vist**ibi**. (n) |
| **Kurmancî** | Wê **ew** xist. (n m) | Wê **ew** xist**iye**. (n m) | Wê **ew** xist**ibû**. (n m) |
| **Kirdkî** | Aye **a** viste. (m) | Aye **a** vista. (m) | Aye **a** vist**ibî**. (m) |
| **Kurmancî** | Wê **ew** xist. (n m) | Wê **ew** xist**iye**. (n m) | Wê **ew** xist**ibû**. (n m) |
| **Kirdkî** | Aye **ma** vist**î**. (zh) | Aye **ma** vistê. (zh) | Aye **ma** vist**ibî**. (zh) |
| **Kurmancî** | Wê **em** xist**in**. (ph) | Wê **em** xist**ine**. (ph) | Wê **em** xist**ibûn**. (ph) |
| **Kirdkî** | Aye **şima** vist**î**. (zh) | Aye **şima** vistê. (zh) | Aye **şima** vist**ibî**. (zh) |
| **Kurmancî** | Wê **hûn** xist**in**. (ph) | Wê **hûn** xist**ine**. (ph) | Wê **hûn** xist**ibûn**. (ph) |
| **Kirdkî** | Aye **ê** vistî. (zh) | Aye **ê** vistê. (zh) | Aye **ê** vist**ibî**. (zh) |
| **Kurmancî** | Wê **ew** xist**in**. (ph) | Wê **ew** xist**ine**. (ph) | Wê **ew** xist**ibûn**. (ph) |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî** | Înan **xo** vist. (n) | Înan **xo** visto. (n) | Înan **xo** vist**ibi**. (n) |
| **Kurmancî** | Wan **xwe** xist. | Wan **xwe** xist**iye**. | Wan **xwe** xist**ibû**. |
| **Kirdkî** | Înan **ez** vista. (m) | Înan **ez** vista. (m) | Înan **ez** vist**ibî**. (m) |
| **Kurmancî** | Wan **ez** xist**im** | Wan **ez** xist**ime**. | Wan **ez** xist**ibûm** |
| **Kirdkî** | Înan **ti** vistî. (n) | Înan **ti** vistê. (n) | Înan **ti** vist**ibî**. (n) |
| **Kurmancî** | Wan **tu** xistî. (n m) | Wan **tu** xist**iye**. (n m) | Wan **tu** xist**ibû**. (n m) |
| **Kirdkî** | Înan **ti** viste. (m) | Înan **ti** vista. (m) | Înan **ti** vist**ibîya**. (m) |
| **Kurmancî** | Wan **tu** xistî. (n m) | Wan **tu** xist**iye**. (n m) | Wan **tu** xist**ibû**. (n m) |
| **Kirdkî** | Înan **o** vist. (n) | Înan **o** visto. (n) | Înan **o** vist**ibi**. (n) |
| **Kurmancî** | Wan **ew** xist. (n m) | Wan **ew** xist**iye**. (n m) | Wan **ew** xist**ibû**. (n m) |
| **Kirdkî** | Înan **a** viste. (m) | Înan **a** vista. (m) | Înan **a** vist**ibî**. (m) |
| **Kurmancî** | Wan **ew** xist. (n m) | Wan **ew** xist**iye**. (n m) | Wan **ew** xist**ibû**. (n m) |
| **Kirdkî** | Înan **ma** vistî. (zh) | Înan **ma** vistê. (zh) | Înan **ma** vist**ibî**. (zh) |
| **Kurmancî** | Wan **em** xist**in**. (ph) | Wan **em** xist**ine**. (ph) | Wan **em** xist**ibûn**. (ph) |
| **Kirdkî** | Înan **şima** vistî. (zh) | Înan **şima** vistê. (zh) | Înan **şima** vist**ibî**. (zh) |
| **Kurmancî** | Wan **hûn** xist**in**. (ph) | Wan **hûn** xist**ine**. (ph) | Wan **hûn** xist**ibûn**. (ph) |
| **Kirdkî** | Înan **ê** vistî. (zh) | Înan **ê** vistê. (zh) | Înan **ê** vist**ibî**. (zh) |
| **Kurmancî** | Wan **ew** xist**in**. (ph) | Wan **ew** xist**ine**. (ph) | Wan **ew** xist**ibûn**. (ph) |

| Zarava | Dema borî ya dîyar | Dema borî ya nedîyar | Çîrokîya dema borî |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî** | Ma **xo** vist. (n) | Ma **xo** visto. (n) | Ma **xo** vistibi. (n) |
| **Kurmancî** | Me **xwe** xist. | Me **xwe** xistiye. | Me **xwe** xistibû. |
| **Kirdkî** | Ma **ez** vista. (m) | Ma **ez** vista. (m) | Ma **ez** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | Me **ez** xistim | Me **ez** xistime. | Me **ez** xistibûm. |
| **Kirdkî** | Ma **ti** vistî. (n) | Ma **ti** vistê. (n) | Ma **ti** vistibî. (n) |
| **Kurmancî** | Me **tu** xistî. (n m) | Me **tu** xistiye. (n m) | Me **tu** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Ma **ti** vista. (m) | Ma **ti** vista. (m) | Ma **ti** vistibîya. (m) |
| **Kurmancî** | Me **tu** xistî. (n m) | Me **tu** xistiye. (n m) | Me **tu** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Ma **o** vist. (n) | Ma **o** visto. (n) | Ma **o** vistibi. (n) |
| **Kurmancî** | Me **ew** xist. (n m) | Me **ew** xistiye. (n m) | Me **ew** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Ma **a** viste. (m) | Ma **a** vista. (m) | Ma **a** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | Me **ew** xist. (n m) | Me **ew** xistiye. (n m) | Me **ew** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Ma **şima** vistî. (zh) | Ma **şima** vistê. (zh) | Ma **şima** vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | Me **hûn** xistin. (ph) | Me **hûn** xistine. (ph) | Me **hûn** xistibûn. (ph) |
| **Kirdkî** | Ma ê vistî. (zh) | Ma ê vistê. (zh) | Ma ê vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | Me **ew** xistin. (ph) | Me **ew** xistine (ph) | Me **ew** xistibûn. (ph) |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **Kirdkî** | Şima **xo** vist. (n) | Şima **xo** visto. (n) | Şima **xo** vistibi. (n) |
| **Kurmancî** | We **xwe** xist. | We **xwe** xistiye. | We **xwe** xistibû |
| **Kirdkî** | Şima **ez** vista. (m) | Şima **ez** vista. (m) | Şima **ez** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | We **ez** xistim. | We **ez** xistime. | We **ez** xistibûm. |
| **Kirdkî** | Şima **ti** vistî. (n) | Şima **ti** vistê. (n) | Şima **ti** vistibî. (n) |
| **Kurmancî** | We **tu** xistî. (n m) | We **tu** xistiye (n m) | We **tu** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Şima **ti** viste. (m) | Şima **ti** vista. (m) | Şima **ti** vistibîya. (m) |
| **Kurmancî** | We tu xistî. (n m) | We **tu** xistiye (n m) | We **tu** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Şima **o** vist. (n) | Şima **o** visto. (n) | Şima **o** vistibi. (n) |
| **Kurmancî** | We **ew** xist. (n m) | We **ew** xistiye. (n m) | We **ew** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Şima **a** viste. (m) | Şima **a** vista. (m) | Şima **a** vistibî. (m) |
| **Kurmancî** | We **ew** xist. (n m) | We **ew** xistiye. (n m) | We **ew** xistibû. (n m) |
| **Kirdkî** | Şima **ma/ê** vistî. (zh) | Şima **ma/ê** vistê. (zh) | Şima **ma/ê** vistibî. (zh) |
| **Kurmancî** | We **em/ew** xistin. (ph) | We **em/ew** xistine. (ph) | We **em/ew** xistibûn. (ph) |

Di cihnavan de:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Ez** kewta. (m) | **Ez** ketime. |
| **Ti** kewtê. (n) | **Tu** ketîyî. (yh) |
| **Ti** kewta. (m) | **Tu** ketîyî. (yh) |
| **O** kewto. (n) | **Ew** ketiye. (yh) |
| **A** kewta. (m) | **Ew** ketiye. (yh) |
| **Ma** kewtê. (zh) | **Em** ketine. (ph) |
| **Şima** kewtê. (zh) | **Hûn** ketine. (ph) |
| **Ê** kewtê. (zh) | **Ew** ketine. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| **Ez nêkewta**. (m) | **Ez neketime**. |
| **Ti nêkewtê**. (n) | **Tu neketîyî**. (yh) |
| **Ti nêkewta**. (m) | **Tu neketîyî**. (yh) |
| **O nêkewto**. (n) | **Ew neketiye**. (yh) |
| **A nêkewta**. (m) | **Ew neketiye**. (yh) |
| **Ma nêkewtê**. (zh) | **Em neketine**. (ph) |
| **Şima nêkewtê**. (zh) | **Hûn neketine**. (ph) |
| **Ê nêkewtê**. (zh) | **Ew neketine**. (ph) |

Di lêkera gerguhêz de kirde di halê tewandî de ye, bireser di halê xwerû de ye, lêker li gor bireserê dihê kişandin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Ehmedî **gule** vista. (m) | Ehmedî **gul** xistiye. (gul: yh) |
| Ehmedî **gulî** vistê. (m) | Ehmedî **gul** xistine. (gul: ph) |
| Asmîne **texte** visto. (n) | Asmînê **texte** xistiye. (texte: yh) |
| Asmîne **texteyî** vistê. (n) | Asmînê **texte** xistine. (texte: ph) |
| Wendekaran **kitab** wendo. (n) | Xwendekaran **kitêb** xwendiye. (kitêb: yh) |
| Wendekaran **kitabî** wendê. (zh) | Xwendekaran **kitêb** xwendine. (kitêb: ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmedî **gule nêvista**. (m) | Ehmedî **gul nexistiye**. (gul: yh) |
| Ehmedî **gulî nêvistê**. (m) | Ehmedî **gul nexistine**. (gul: ph) |

| | |
|---|---|
| Asmîne **texte nêvisto**. (n) | Asmînê **texte nexistiye.** (texte: yh) |
| Asmîne **texteyî nêvistê**. (n) | Asmînê **texte** xis**tine**. (texte: ph) |
| Wendekaran **kitab nêwendo**.(n) | Xwendekaran **kitêb nexwendiye**. (kitêb: yh) |
| Wendekaran **kitabî nêwendê**.(zh) | Xwendekaran **kitêb nexwendine.** (kitêb: ph) |

**17.2.3.Çîrokîya dema borî** jî, paşqertafa "**-ibi/-ibî**" dihê dawîya koka lêkerê. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **kewt**ene | **ket**in |
| Ehmed kewt**ibi.** (n) | Ehmed ket**ibû**. (n) |
| Asmîne kewt**ibî.** (m) | Asmîn ket**ibû**. (m) |
| Wendekarî kewt**ibî**. (zh) | Xwendekar ket**ibûn**. (ph) |

Neyînîya wê:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed **nêkewtibi.** | Ehmed **neketibû.** |
| Asmîne **nêkewtibî.** | Asmîn **neketibû.** |
| Wendekarî **nêkewtibî.** | Xwendekar **neketibûn.** |

Di cihnavan de:

| | |
|---|---|
| **Ez** kewt**ibîya**. (m) | **Ez** ket**ime.** |
| **Ti** kewt**ibî**. (n) | **Tu** ket**ibûyî**. (yh) |
| **Ti** kewt**ibîya**. (m) | **Tu** ket**ibûyî**. (yh) |
| **O** kewt**ibi**. (n) | **Ew** ket**ibû**. (yh) |
| **A** kewt**ibî**. (m) | **Ew** ket**ibû**. (yh) |
| **Ma** kewt**ibî**. (zh) | **Em** ket**ibûn**. (ph) |
| **Şima** kewt**ibî**. (zh) | **Hûn** ket**ibûn**. (ph) |
| **Ê** kewt**ibî**. (zh) | **Ew** ket**ibûn**. (ph) |

## 17.3.DEMA BÊ

Dema bê, manaya xwe ev e ku kar hîn nebûye lê dê bibe. Ev dem jî di nava xwe de dibe du beş:

**1) Dema bê**

**2) Çîrokîya dema bê**

**17.3.1.Dema bê,** bi alîkarîya partîkela "**do**"yê çêdibe (ji bo vê partîkelê li rûpel 110 binihêre). Jixwe ya kurmancî jî bi alîkarîya partîkela "**dê**"yê çêdibe. Lêker jî bi pêşqertafa "**bi-**" û di halê neyînî de jî bi pêşqertafa "**nê-**" çêdibe. Di raweya vê demê de eynî wekî dema niha kirde tim di halê xwerû de ye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| kewtene | **ketin** |
| Ehmed do **bikewo**. (n) | Ehmed dê **bikeve**. (yh) |
| Asmîne do **bikewo**. (m) | Asmîn dê **bikeve**. (yh) |
| Wendekarî do **bikewê**. (zh) | Xwendekar dê **bikevin**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmed do **nêkewo**. (n) | Ehmed dê **nekeve**. (yh) |
| Asmîne do **nêkewo**. (m) | Asmîn dê **nekeve**. (yh) |
| Wendekarî do **nêkewê**. (zh) | Xwendekar dê **nekevin**. (ph) |

i cihnavan de:

| | |
|---|---|
| Ez do **bikewî**. (m) | Ez dê **bikevim**. (?) |
| Ti do **bikewî**. (n m) | Tu dê **bikevî**. (yh) |
| O do **bikewo**. (n) | Ew dê **bikeve**. (yh) |
| A do **bikewo/bikewa**. (m) | Ew dê **bikeve**. (yh) |
| Ma do **bikewê/bikewin**. (zh) | Em dê **bikevin**. (ph) |
| Şima do **bikewê**. (zh) | Hûn dê **bikevin**. (ph) |
| Ê do **bikewê**. (zh) | Ew dê **bikevin**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ez do **nêkewî**. (m) | Ez dê **nekevim**. (?) |
| Ti do **nêkewî**. (n m) | Tu dê **nekevî**. (yh) |
| O do **nêkewo**. (n) | Ew dê **nekeve**. (yh) |
| A do **nêkewo/nêkewa**. (m) | Ew dê **nekeve**. (yh) |
| Ma do **nêkewê/nêkewin**. (zh) | Em dê **nekevin**. (ph) |
| Şima do **nêkewê**. (zh) | Hûn dê **nekevin**. (ph) |
| Ê do **nêkewê**. (zh) | Ew dê **nekevin**. (ph) |

| Zarava | Dema bê | Çîrokîya dema bê |
|---|---|---|

| | | |
|---|---|---|
| **Kirdkî** | **Ez** do xo/ey/aye/ma/şima/înan **bifînî**. | Mi do **xo/o/a/ma/şima/ê** bivistêne. |
| **Kurmancî** | **Ez** dê xwe/wî/wê/me/we/wan **bixînim**. | Min dê **xwe/em/hûn/we** bixista, **-na**. |

| | | |
|---|---|---|
| **Kirdkî** | **Ti** do xo/ey/aye/ma/şima/înan **bifînî**. | To do **xo/o/a/ma/şima/ê** bivistêne. |
| **Kurmancî** | **Tu** dê xwe/wî/wê/me/we/wan **bixînî**. | Te dê **xwe/wî/wê/em/hûn/wan** bixista, **-na**. |

| | | |
|---|---|---|
| **Kirdkî** | **O** do xo/ey/aye/ma/şima/înan **bifîno**. (n) | Ey do **xo/o/a/ma/şima/ê** bivistêne. |
| **Kurmancî** | **Ew** dê xwe/wî/wê/me/we/wan **bixîne** | **Wî** dê **xwe/wî/wê/em/hûn/wan** bixista, **-na**. |

| | | |
|---|---|---|
| **Kirdkî** | **A** do xo/ey/aye/ma/şima/înan **bifîno**. (m) | Aye do **xo/o/a/ê/ma/şima** bivistêne |
| **Kurmancî** | **Ew** dê xwe/wî/wê/me/we/wan **bixîne** | Wê dê **xwe/wî/wê/em/hûn/wan** bixista, **-na**. |

| | | |
|---|---|---|
| **Kirdkî** | **Ma** do xo/ey/aye/şima/înan **bifînin**. (zh) | Ma do **xo/o/a/ê/şima** bivistêne. |
| **Kurmancî** | **Em** dê xwe/wî/wê/we/wan **bixînin** | Me dê **xwe/wî/wê/em/hûn/wan**bixista, **-na**. |

| | | |
|---|---|---|
| **Kirdkî** | **Şima** do xo/ey/aye/ma/înan **bifînin**. (zh) | Ma do **xo/o/a/ê/şima** bivistêne. |
| **Kurmancî** | **Hûn** dê xwe/wî/wê/me/wan **bixînin**. | We dê **xwe/wî/wê/em/hûn/wan** bixista, **-na**. |

| | | |
|---|---|---|
| **Kirdkî** | **Ê** do xo/ey/aye/ma/şima/înan **bifînê**. (zh) | Înan do **xo/o/a/ê/ma/şima** bivistêne |
| **Kurmancî** | **Ew** dê xwe/wî/wê/me/ew/me **bixînin** | We dê **xwe/wî/wê/em/hûn/wan** bixista, **-na**. |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| şîyene | çûyîn |
| Ehmed do şiro. | Ehmed dê biçe/here. |
| Asmîne do şiro/şira. | Asmîn dê biçe/here. |
| Wendekarî do şirê. | Xwendekar dê biçin/herin. |

| | |
|---|---|
| Neyînîya wê: | |
| Ehmed do nêşiro. | Ehmed dê neçe/nere. |
| Asmîne do nêşiro/şira. | Asmîn dê neçe/neere. |
| Wendekarî do nêşirê. | Xwendekar dê neçin/neerin. |

| | |
|---|---|
| Di cihnavan de: | |
| Ez do şirî. (m) | Ez dê biçim/herim. |
| Ti do şirî. (n m) | Tu dê biçî/herî. (n m) |
| O do şiro.(n) | Ew dê biçe/here. (n) |
| A do şiro/şira. (m) | Ew dê biçe/here. (m) |
| Ma do şirê/şirin. (zh) | Em dê biçin/herin. (ph) |
| Şima do şirê. (zh) | Hûn dê biçin/herin. (ph) |
| Ê do şirê. (zh) | Ew dê biçin/herin. (ph) |

| | |
|---|---|
| Neyînîya wê: | |
| Ez do nêşirî. (m) | Ez dê neçim/nerim. |
| Ti do nêşirî. (n m) | Tu dê neçî/nerî. (n m) |
| O do nêşiro.(n) | Ew dê neçe/nere. (n) |
| A do nêşiro/şira. (m) | Ew dê neçe/nere. (m) |
| Ma do nêşirê/nêşirin. (zh) | Em dê neçin/nerin. (ph) |
| Şima do nêşirê. (zh) | Hûn dê neçin/nerin. (ph) |
| Ê do nêşirê. (zh) | Ew dê neçin/nerin. (ph) |

Di raweya vê demê de, ger lêker gerguhêz be jî dîsa kirde tim di halê xwerû de lê bireser di halê tewandî de ye. Pêveber li gor kirdeyê dihê kişandin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| berdene | birin |
| **Ez** do saye **biberî**. (m) | **Ez** dê sêvê **bibim**. (?) |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Ez** do say**an** biber**î**. (m) | **Ez** dê sêv**an** bibim. (?) |
| **Ti** do saye **biberî**. (n m) | **Tu** dê sêv**ê** **bibî**. (yh) |
| **Ti** do sayan **biberî**. (n m) | **Tu** dê sêv**an** **bibî**. (yh) |
| **O** do saye **bibero**. (n) | **Ew** dê sêv**ê** **bibe**. (yh) |
| **O** do say**an** **bibero**. (n) | **Ew** dê sêv**an** **bibe**. (yh) |
| **A** do saye **bibera**. (m) | **Ew** dê sêv**ê** **bibe**. (yh) |
| **A** do say**an** **bibera**. (m) | **Ew** dê sêv**an** **bibe**. (yh) |
| **Ma** do saye **biberê**. (zh) | **Em** dê sêv**ê** **bibin**. (ph) |
| **Ma** do sayan **biberê/biberin**. (zh) | **Em** dê sêv**an** **bibin**. (ph) |
| **Şima** do saye **bi**berê. (zh) | **Hûn** dê sêv**ê** **bibin**. (ph) |
| **Şima** do say**an** **bi**berê. (zh) | **Hûn** dê sêv**an** **bibin**. (ph) |
| **Ê** do saye **biberê**. (zh) | **Ew** dê sêv**ê** **bibin**. (ph) |
| **Ê** do say**an** **biberê**. (zh) | **Ew** dê sêv**an** **bibin**. (ph) |

**17.3.2.Çîrokîya dema bê** jî eynî mîna çîrokîya dema niha ye, cihêtîya wan ev e ku dema bê bi alîkarîya partîkela "**do**"yê çêdibe. Di lêkera negerguhêz de kirde di halê xwerû de ye lê di lêkera gerguhêz de kirde dihê tewandin, bireser di halê xwerû de dimîne. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **kewt**ene | **ket**in |
| Ehmed do **bi**kewt**ê**ne. | Ehmed dê **biketa**. (yh) |
| Asmîn**e** do **bi**kewt**ê**ne. | Asmîn dê **bi**diketa. (yh) |
| Wendekar**î** do **bi**kewt**ê**ne. | Xwendekar dê **biketana**. (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmed do **nê**kewt**ê**ne. | Ehmed dê **neketa**. (yh) |
| Asmîn**e** do **nê**kewt**ê**ne. | Asmîn dê **nediketa**. (yh) |
| Wendekar**î** do **nê**kewt**ê**ne. | Xwendekar dê **neketana**. (ph) |

Di cihnavan de:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Ez do **bikewtêne.** | **Ez** dê **biketama.** (?) |
| Ti do **bikewtêne.** | **Tu** dê **biketa.** (yh) |
| O do **bikewtêne.** | **Ew** dê **biketa.** (yh) |
| A do **bikewtêne.** | **Ew** dê **biketa.** (yh) |
| Ma do **bikewtêne.** | **Em** dê **biketana.** (ph) |
| Şima do **bikewtêne.** | **Hûn** dê **biketana.** (ph) |
| Ê do **bikewtêne.** | **Ew** dê **biketana.** (ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ez do **nêkewtêne.** | **Ez** dê **neketama.** (?) |
| Ti do **nêkewtêne.** | **Tu** dê **neketa.** (yh) |
| O do **nêkewtêne.** | **Ew** dê **neketa.** (yh) |
| A do **nêkewtêne.** | **Ew** dê **neketa.** (yh) |
| Ma do **nêkewtêne.** | **Em** dê **neketana.** (ph) |
| Şima do **nêkewtêne.** | **Hûn** dê **neketana.** (ph) |
| Ê do **nêkewtêne.** | **Ew** dê **neketana.** (ph) |

Di lêkera gerguhêz de:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **berdene** | **birin** |
| Ehmedî do saye **biberdêne.** | Ehmedî dê sêv **bibira.** (sêv: yh) |
| Ehmedî do sayî **biberdêne.** | Ehmedî dê sêv **bibirana.** (sêv: ph) |
| Asmîne do saye **biberdêne.** | Asmînê dê sêv **bibira.** (sêv: yh) |
| Asmîne do sayî **biberdêne.** | Asmînê dê sêv **bibirana.** (sêv: ph) |
| Wendekaran do saye **biberdêne.** | Xwendekaran dê sêv **bibira.** (sêv: yh) |
| Wendekaran do sayî **biberdêne.** | Xwendekaran dê sêv **bibirana.** (sêv: ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Ehmedî do saye **nêberdêne.** | Ehmedî dê sêv **nebira.** (sêv: yh) |
| Ehmedî do sayî **nêberdêne.** | Ehmedî dê sêv **nebirana.** (sêv: ph) |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Asmîne do saye **nêberdêne.** | Asmînê dê sêv **nebira.** (sêv: yh) |
| Asmîne do sayî **nêberdêne.** | Asmînê dê sêv **nebirana.** (sêv: ph) |
| Wendekaran do saye **nêberdêne.** | Xwendekaran dê sêv **nebira.** (sêv: yh) |
| Wendekaran do sayî **nêberdêne.** | Xwendekaran dê sêv **nebirana.** (sêv: yh) |

Di cihnavan de:

| | |
|---|---|
| Mi do saye **biberdêne.** | Min dê **sêv bibira.** (sêv: yh) |
| Mi do sayî **biberdêne.** | Min dê **sêv bibirana.** (sêv: ph) |
| To do saye **biberdêne.** | Te dê **sêv bibira.** (sêv: yh) |
| To do sayî **biberdêne.** | Te dê **sêv bibirana.** (sêv: ph) |
| Ey do saye **biberdêne.** | Wî dê **sêv bibira.** (sêv: yh) |
| Ey do sayî **biberdêne.** | Wî dê **sêv bibirana.** (sêv: ph) |
| Aye do saye **biberdêne.** | Wê dê **sêv bibira.** (sêv: yh) |
| Aye do sayî **biberdêne.** | Wê dê **sêv bibira.** (sêv: ph) |
| Ma do saye **biberdêne.** | Me dê **sêv bibira.** (sêv: yh) |
| Ma do sayî **biberdêne.** | Me dê **sêv bibirana.** (sêv: ph) |
| Şima do saye **biberdêne.** | We dê **sêv bibira.** (sêv: yh) |
| Şima do sayî **biberdêne.** | We dê **sêv bibirana.** (sêv: ph) |
| Înan do saye **biberdêne.** | Wan dê **sêv bibira.** (sêv: yh) |
| Înan do sayî **biberdêne.** | Wan dê **sêv bibirana.** (sêv: ph) |

Neyînîya wê:

| | |
|---|---|
| Mi do saye **nêberdêne.** | Min dê **sêv nebira.** (sêv: yh) |
| Mi do sayî **nêberdêne.** | Min dê **sêv nebirana.** (sêv: ph) |
| To do saye **nêberdêne.** | Te dê **sêv nebira.** (sêv: yh) |
| To do sayî **nêberdêne.** | Te dê **sêv nebirana.** (sêv: ph) |
| Ey do saye **nêberdêne.** | Wî dê **sêv nebira.** (sêv: yh) |
| Ey do sayî **nêberdêne.** | Wî dê **sêv nebirana.** (sêv: ph) |
| Aye do saye **nêberdêne.** | Wê dê **sêv nebira.** (sêv: yh) |
| Aye do sayî **nêberdêne.** | Wê dê **sêv nebira.** (sêv: ph) |
| Ma do saye **nêberdêne.** | Me dê **sêv nebira.** (sêv: yh) |
| Ma do sayî **nêberdêne.** | Me dê **sêv nebirana.** (sêv: ph) |

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Şima do saye **nêberdêne**. | We dê **sêv nebira**. (sêv: yh) |
| Şima do sayî **nêberdêne**. | We dê **sêv nebirana**. (sêv: ph) |
| Înan do saye **nêberdêne**. | Wan dê **sêv nebira**. (sêv: yh) |
| Înan do sayî **nêberdêne**. | Wan dê **sêv nebirana**. (sêv: ph) |

## AWIRÊ AYE ÇIMANÊ MI DE MENDÊ

Ez vana qey emrê aye amebi nêzdîyê çewresî. Tay didanê xo viraştibî la sewbîna gewze bî. Zaf rinda rinde nêbî la xirabe qet nêbî. Wexto ke xîtabê mı kerdêne, mi ra vatêne "Keko". Eke ez a zerrîya xo vaja; mi bi çimê yew waya xo ya heqe ewnîyayne aye ra. Hende zeman ma pîya mendî, ma xo rê hende yarî û henekî kerdêne zî la vera aye de caran yew fikrê cinsî nêameyne hêşê mi. Ez bawer kena ke aye zî hertim bi nê çimî ewnîyayne mi ra. Mi gore, ma se way û bira bî.

Çi wexto ke boya aye bîyêne tenge ameyne mi het. Aye vatêne, mi zî goşdarî kerdêne. Dima ra mi vatêne, aye goşdarî kerdêne. Hêdî-hêdî rengê rîyê aye sey yew vile bîyêne a. Huyayîş kewtêne fek. Wexto ke weriştêne şîyêne, vatêne "Ez wexto ke yena verê to canê mi zaf giran o. Lingê mi berz nêbenê. La wexto ke ez verê to ra agêrena, canê mi beno sivik. Mij û dûmano ke ha mîyanê hêşê mi de, heme beno vila. Ez asan cîfê xo dana û gêna."

Payanî ra winî vatêne û şîyêne. Çend gamî şîyêne, milê xo ser de fetilîyayne, bi yew awiro şîrin û germin ewnîyayne mi ra û şîyêne. Gama ke verê xo tadayne, porê aye winî gilover hewadîyayne û ronîyayne. Bi o qayde ewnîyayîşê aye yew guman kerdêne zereyê mi, seke a aşiqa min a; seke bi hawayêko cînsî mi ra hes kena. Senî ke aye bi ê awiranê manîdaran ewnîyayne mi ra, mi vatêne qey mîyanê zerrîya mi de çîyê visîyeno. Awêka girênaya çokanê mi ra şîyêne war. Çokê mi bîyêne sistî. Hêşê mi bîyêne vila...

Rey-rey mi aye ra pers kerdêne ke çî rê nêzewijêna. Vatêne, "Qeder, qeder!" Dima ra zî vatêne, "Willayî ez zerrî ra vana, hetanî ewro mi yew esilzade, yew şithelalo goreyê xo ra nêdîyo ke ez xo rê bizewijîya!" Rey-rey ke na meselaya zewajî de mi bineyke zor dayêne aye, mi ra vatêne, "De hadê, mi rê yewêkê sey xo bivîne, ez xo rê ey reyde bizewijîya!"

Çend rojî verê cû, serê sibayî ameye keyeyê mi. No ameyîşê aye mi rê sey yew surprîzî bi. Ez tena keye de bîya. Roja yewşeme bî. A roje zî şefeqêk ra vewre dest pêkerdibi, sey simerî ameyne war. Elektrîk birîyabi.

Serê sibayî ra hetanî nêmeyê şewe keyeyê mi de, yew oda de, verê sobaya germine de ma xo rê suhbet kerd. Aye va, mi goşdarî kerd. Dima ra mi va, aye goşdarî kerd. Ma yewî va, yewî goşdarî kerd...

# AWIRÊN WÊ DI ÇAVÊN MIN DE MANE

Ez dibêjim qey emrê wê hatibû nêzîkî çilî. Hinek diranên xwe çêkiribûn lê wekî din gewz bû. Zêde bedewa bedew nebû lê xirab qet nebû. Dema ku deng li min dikir, digot "Keko". Ger ez a dilê xwe bibêjim; min bi çavê xwişkeka xwe ya heq li wê dinihêrî. Ewqas zeman em bi hev re man, me ewqas yarî û henek bi hev re dikirin jî lê tu car li hemberî wê fikreka cinsî nedihat bîra min. Ez bawer im ku wê jî bi vî çavî li min dinihêrî. li gor min em wek xwişk û bira bûn.

Çi dema ku bêhna wê teng dibû dihat ba min. Wê digot, min guhdarî dikir. Dû re min digot, wê guhdarî dikir. Hêdî bi hêdî rengê rûyê wê wek gulekê vedibû. Kenîn diket devê wê. Dema ku radibû diçû, digot "Dema ku ez dihêm ba te canê min giran e. Lingên min ji erdê bilind nabin. Lê dema ku ez ji ba te vedigerim canê min sivik dibe, mij û morana nav hişê min tev belav dibe. Ez bi hêsanî bêhna xwe didim û distînim."

Li pîya wisa digot û diçû. Çend gav diçû, di ser milê xwe re dizîvirî, bi awirekê şîrîn û germ li min dinihêrî û diçû. Dema ku serê xwe dizîvirand porê wê jî wisa gilover hildibû û dadiket. Bi vî awayî nihêrîna wê gumanek dikir hundirê min, mîna ku ew aşiqa min be; mîna ku bi awayekê cînsî ji min hes bike. Çawa ku wê bi wan awirên manîdar li min dinihêrî, min digot qey di nav dilê min de tiştekî diqete. Aveka kelandî di çîpên min re berjêr dibû. Çokên min sist dibûn. Hişê min tevlihev dibû...

Carînan min jê dipirsî ku bê hela çima nazewice. Digot, "Qeder, qeder!" Dû re jî digot, "Welleh ez ji dil dibêjim, heta bi îro min yekê esilzade, yekê şîrhelal yê li gor xwe nedîtîye ku ez pê re bizewicim!" Carînan ku di vê meseleya zewacê de min zor didayê, hingê digot "De hadê, ji min re yekê wek xwe bibîne, ez ê pê re bizewicim!"

Çend roj berê, roja yekşemê sipêdeyekê hate mala min. Ev hatina wê ji min re surprîzek bû. Ez bi tenê li mal bûm. Wê rojê jî şefeqekê befrê dest pê kiribû wek kayê dihate xwarê. Elektrîk hatibû birîn.

Ji sipêdeyê heta bi nîvê şevê li mala min ma, li odeyekê, li ber sobeya germ me ji xwe re suhbet kir. Wê got, min guhdarî kir. Dû re min got, wê guhdarî kir. Me yekî got, yekî guhdarî kir...

# 18.HEVOK

Dema ku kirde û lêkerek li gor qayîdeyekê û bi hev re eleqedar li dû hev rêz dibin û manayekê çêdikin; yanî fikrek, hîsek, tiştek yan karekî îfade dikin, jê re dibêjin **hevok**. Deng û peyv çi dema ku dibin hevok, hîn wê demê îfade çêdibe û ziman pêk dihê. Ji alîyê avanî û pêkhatinê ve hevok bingeha zimanî ye.

Di nivîsînê de hevok bi herfa gir dest pê dike û bi îşareteka nuqtayê (. ! ? :) temam dibe. Hevok dişê tenê ji lêkerek yan peyvekê jî pêk bihê. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| O vindert. Ewnîya. Kes nêdî. | Ew sekinî. Nihêrî. Kes nedî. |
| Kamî ez musnaya? Mamostayî. | Kê ez hîn kirim? Mamostayî. |

Lê esas hevok bi çend bêjeyên ku li gor qayîdeyekê li dû hev rêz dibin, çêdibe. Yanî hevok bi elementên "**kirde**", "**bireser**" û "**lêker**"ê çêdibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed saye weno. | Ehmed sêvê dixwe. |

Wekî ku dixuye, di vî halî de ji elementên bingehîn yên hevokê "**kirde**" kar dike, "**bireser**" dikeve binê tesîra kirdeyê û "**pêveber**" jî lebitîna kirdeyê nîşan dide. Îcar elementên din yên zimanî, em bibêjin elementên mîna *rengdêr*, *daçek*, *cihnav*, *hoker*, *gihanek* û *partîkel* jî dikevin navbera van her sê elementên bingehgîn yên hevokê û dikin ku mana fireh bibe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmed saye weno. | Ehmed sêvê dixwe. |
| Ehmed saya sûre nêweno. | Ehmed sêva sor naxwe. |
| Ehmed sayan û xewxan weno. | Ehmed sêvan û xewxan dixwe. |

Di navbera kirdkî û kurmancî de ji alîyê bikarînana hinek daçekan ve cihêtî heye lê ji alîyê sentaksê ve mîna hev in. Hertim kirde di serî de ye. Bi giranî pêveber li dawîya hevokê ye. Lê di hin îfadeyan de dişê li pêşîya hokerê be. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez Dîyarbekir ra **yena**. | Ez ji Dîyarbekirê **dihêm**. |
| Ez **şina** [bi] Dîyarbekir. | Ez **diçim** [bo] Dîyarbekirê. |

Hevok dişê ji çend îfadeyan jî pêk bihê. Lê wê demê yan divê îfade bi vîrgulê (,) ji hev bihên cihêkirin yan jî gihanekek bikeve navbera îfadeyan. Nimûne:

**Kirdkî:** Ehmed keye ra vejîya, kuçe de çend gamê pêtî eştî **la** ame vîrê ey **ke** çanteyê xo serê masa de xo vîr ra kerdo.

**Kurmancî**: Ehmed ji malê derket, di kuçeyê de çend gavên pihêt avêtin **lê** hat bîra wî **ku** çanteyê xwe li ser maseyê ji bîr ve kiriye.

Meriv dişê îfadeyên hevokê zêdetir bike lê gelekê caran zêdebûna îfadeyan fêmkirinê zehmet dike.

**18.1.KIRDE**

Di hevokê de yê ku kar dike, jê re dibêjin **kirde**. Yanî kirde, di hevokê de bersiva pirsên *kê* û *çi* ku ji pêveberê dihên pirsîn e. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Cam** şikîya. | **Cam** şikîya/şikest. |
| **Qeleme** kewte. | **Qelem** ket. |
| **Ardî** rijîyayî. | **Arvan** rijîyan. |

Di van hevokan de yên ku di fealîyetê de ne, yanî **cam**, **qelem** û **arvan** ***kirde*** ne.

Lê dema ku em wisa bibêjin:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Ehmedî** cam şikit. | **Ehmedî** cam şikand. |
| **Zelale** qelem viste. | **Zelalê** qelem xist. |
| **Karkeran** ardî rijnayî. | **Kerkeran** arvan rêtin. |

Îcar **Ehmed**, **Zelal** û **karker** ***kirde*** ne, **cam**, **qelem** û **arvan** ***bi-reser*** in.

### 18.1.1.Kirdeya Veşarî

Di kirdkî de jî eynî wekî kurmancî kirde hertim li pêşîyê ye û divê navê kirde bi xwe yan jî cihnavê kirdeyê bihê nivîsîn. Çunke dema ku kirde veşartî be dibe ku mana xelet bihê fêmkirin yan jî tam nehê fêmkirin. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Ameya û şîya. | Hatîye û çûye. |

Kî hatîye û çûye? Heke kirde dîyar nebe mana jî tam dîyar nebe. Ev di kirdkî de bêhtir pêwîst e. Çunke cihnavê "**ez**" tim mêkî dihê bi-karînan. Lewre di kişandina her du lêkeran de nîsbet bi kurmancî dîyar e ku kirdeya veşarî mê ye. Lê dibe ku bi rêya cihnava "**ez**" kirde nêr be jî. Lewre dema ku hevok dihê nivîsîn divê kirde veşartî nebe. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| **Ez** ameya û şîya. (m) | **Ez** hatim û çûm. (?) |
| **Ti** ameyî û şîyî. (n) | **Tu** hatî û çûyî. (yh) |
| **Ti** ameya û şîya. (m) | **Tu** hatî û çûyî. (yh) |
| **O** ameyo û şîyo. (n) | **Ew** hatiye û çûye. (yh) |
| **A** ameya û şîya. (m) | **Ew** hatiye û çûye. (yh) |
| **Ma** ameyê û şîyê. (zh) | **Em** hatine û çûne. (ph) |
| **Şima** ameyê û şîyê. (zh) | **Hûn** hatine û çûne. (ph) |
| **Ê** ameyê û şîyê. (zh) | **Ew** hatine û çûne. (ph) |

Ji ber ku kirdkî û kurmancî her du jî nîv-ergatîv in, dîyarkirina kirdeyê ji alîyê gerguhêzî û negerguhêzîyê ve jî muhîm e. Çunke divê dîyar be ku lêker li gor kîjan cinsîyetê dihê kişandin. Dîsa, ji bo ku her du dîyalekt jî tewangbar in lewre xwedîyê du grûpên cihnavan e. Îcar di du îfadeyên hevokekê de lêkerek dişê negerguhêz be ya din gerguhêz be. Ji vê çendê ji bo her lêkerek divê wekî kirde cihnavek cihê bihê bikarînan û veşartî nebe. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Ez** ameya la **mi** nêdî. | **Ez** hatim lê **min** nedît. |

Di vê hevokê de kirde eynî kes e, yanî "**ez**" im. Lê ji ber ku lêkera "hatin"ê (ameyene) negerguhêz e, lewre cihnav ji grûpa halê xwerû ye. Lêbelê ji ber ku di îfadeya duyem de lêker gerguhêz e, divê cihnav ji grûpa halê tewandî (oblîk) be.

Di kirdkî û kurmancî de di raweya dema niha û dema bê de lêker negerguhêz in, lewre kirde di halê xwerû de ne. Yanî di van halan de wekî kirde cihnavên grûpa halê xwerû dihên bikarînan. Îcar di demên borî û çîrokîya deman de jî, heke lêker gerguhêz be, kirde di halê tewandî de ne. Yanî wekî kirde cihnavên grûpa halê tewandî dihên bikarînan.

Ji bo **dema niha** nimûne:

***Dema niha ya nedîyar***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Ez** yena, **[ez]** wena. (m) | **Ez** dihê**m**, **[ez]** dixwi**m**. (?) |
| **Ti** yen**î**, **[ti]** wen**î**. (n) | **Tu** dihêy**î**, **[tu]** dixw**î**. (yh) |
| **Ti** yena, **[ti]** wena. (m) | **Tu** dihêy**î**, **[tu]** dixw**î**. (yh) |
| **O** yeno, **[o]** weno. (n) | **Ew** dihê, **[ew]** dixwe. (yh) |
| **A** yena, **[a]** wena. (m) | **Ew** dihê, **[ew]** dixwe. (yh) |
| **Ma** yenê, **[ma]** wenê. (zh) | **Em** dihên, **[em]** dixwin. (ph) |
| **Şima** yenê, **[şima]** wenê. (zh) | **Hûn** dihên, **[hûn]** dixwin. (ph) |
| **Ê** yenî, **[ê]** wenê. (zh) | **Ew** dihên, **[ew]** dixwin. (ph) |

Ji bo **dema bê** nimûne:

***Dema bê***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Ez** do biyera, [**ez**] do biwera. (m) | **Ez** dê bihêm, [**ez** dê bixwim. |
| **Ti** do biyerî, [**ti**] biwerî. (n) | **Tu** dê werî, [**tu**] dê bixwî. |
| **Ti** do biyera, [**ti**] do biwera. (m) | **Tu** dê werî, [**tu**] dê bixwî. |
| **O** do biyero, [**o**] do biwero. (n) | **Ew** dê bihê, [**ew**] dê bixwe. |
| **A** do biyera, [**a**] do biwera. (m) | **Ew** dê bihê, [**ew**] dê bixwe. |
| **Ma** do biyerê, [**ma**] do biwerê. (zh) | **Em** dê bihên, [**em**] dê bixwin. |
| **Şima** do biyerê, [**şima**] do biwerê. (zh) | **Hûn** dê bihên, [**hûn**] dê bixwin. |
| **Ê** do biyerê, [**ê**] do biwerê. (zh) | **Ew** dê bihên, [**ew**] dê bixwin. |

Li vir, mîna ku dixuye, ji ber ku di her du îfadeyan de jî pozîsyona kirdeyê naguhere, lewre ji bo îfadeya dawîn kirde hewce nake.

Îcar em dê bala xwe bidin ser dema borî û çîrokîya deman:

(Di hemî nimûneyên jêrîn de biresera îfadeya duyem ya hevokan tim wekî yekhejmarê nêr, em bibêjin wekî "**nan**" hatiye hesabkirin. Lewre kişandina lêkerê tim li gor biresereka yekhejmar û nêr e. Dema ku bireser mê yan pirhejmar be, kişandina lêkerê li gor biresere diguhere.)

***Dema borî ya dîyar***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Ez** ameya, **mi** werd. (m) | **Ez** hatim, **min** xwar. |
| **O** ame, **ey** werd. (n) | **Ew** hat, **wî** xwar. |
| **A** ameye, **aye** werd. (m) | **Ew** hat, **wê** xwar. |
| **Ma** ameyî, [**ma**] werd. (zh) | **Em** hatin, **me** xwar. |
| **Şima** ameyî, [**şima**] werd. (zh) | **Hûn** hatin, **we** xwar. |
| **Ê** ameyî, **înan** werd. (zh) | **Ew** hatin, **wan** xwar. |

***Dema borî ya nedîyar***

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Ez** ame**bî**, **mi** werd**ibi**. (m) | **Ez** hati**bûm**, **min** xwari**bû**. |
| **O** ame**bi**, **ey** werd**ibi**. (n) | **Ew** hati**bû**, **wî** xwari**bû**. |
| **A** ame**bî**, **aye** werd**ibi**. (m) | **Ew** hati**bû**, **wê** xwari**bû**. |

| | |
|---|---|
| Ma ameybî, [ma] werdibi. (zh) | Em hatibûn, me xwaribû. |
| Şima ameybî, [şima] werdibi. (zh) | Hûn hatibûn, we xwaribû. |
| Ê ameybî, înan werdibi. (zh) | Ew hatibûn, wan xwaribû. |

*Çîrokîya dema borî*

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Ez amebîya, mi werdibîyo. (m) | Ez hatbûme, min xwaribûye. |
| O amebîyo, ey werdibîyo. (n) | Ew hatibûye, wî xwaribûye. |
| A amebîya, aye werdibîyo. (m) | Ew hatibûye, wê xwaribûye. |
| Ma amebîyê, [ma] werdibîyo. (zh) | Em hatibûne, me dixwaribûye. |
| Şima amebîyê, [şima] werdibîyo. (zh) | Hûn hatibûne, we xwaribûye. |
| Ê amebîyê, înan werdibîyo. (zh) | Ew hatibûne, wan xwaribûye. |

*Çîrokîya dema niha*

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Ez ameyêne, mi werdêne. (m) | Ez dihatim, min dixwar. |
| O ameyêne, ey werdêne. (n) | Ew dihat, wî dixwar. |
| A ameyêne, aye werdêne. (m) | Ew dihat, wê dixwar. |
| Ma ameyêne, [ma] werdêne. (zh) | Em dihatin, me dixwar. |
| Şima ameyêne, [şima] werdêne. (zh) | Hûn dihatin, we dixwar. |
| Ê ameyêne, înan werdêne. (zh) | Ew dihatin, wan dixwar. |

*Çîrokîya dema bê*

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| Ez do biameyêne, mi do biwerdêne. (m) | Ez dê bihatama, min dê bixwara. |
| O do biameyêne, ey do biwerdêne. (n) | Ew dê bihata, wî dê bixwara. |
| A do biameyêne, aye do biwerdêne. (m) | Ew dê bihata, wê dê bixwara. |
| Ma do biameyêne, [ma] do biwerdêne. (zh) | Em dê bihatana, me dê bixwara. |
| Şima do bi ameyêne, [şima] do biwerdêne. (zh) | Hûn dê bihatana, we dê bixwara. |
| Ê do biameyêne, înan do biwerdêne. (zh) | Ew dê bihatana, wan dê bixwara. |

Ji alîyê hevoksazîyê ve tiştê ku di van halan de ji bo kirdkî divê meriv dîqet bike ev e. Ji ber ku cihnavên pirhejmarîyê yên kirdkî "**ma**" û "**şima**" di her du halan de, yanî hem di halê xwerû hem tewandî de tim eynî ne, lewre hewce nake ku ji bo îfadeya duyem ya ku lêkera wê gerguhêz e ev cihnav dubare bihên nivîsîn. Lê ji bo kurmancî ne wisa ye. Çunke ev her du cihnav di kurmancî de ji bo halê xwerû ("em" û "hûn") cihê ji bo halê tewandî ("me" û "we") cihê ne.

### 18.2.BIRESER

Ji elementên hevokê ya ku rasterast ji kirdeyê mutesîr dibe, jê re dibêjin **bireser** (obje). Bireser ji kirdeyê mutesîr dibe lê di lêkerên gerguhêz de li ser oêveberê tesîr dike.

Di hevoksazîya kirdkî de jî eynî wekî kurmancî, dema ku bireser di hevokê de tune be, lêker negerguhêz e û li gor kirdeyê dihê kişandin. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| **Ehmed** huyeno. (n) | **Ehmed** dikene. |
| **Şayla** bermena. (m) | **Şayla** digirî. |
| **Ardî** rijîyenê. (zh) | **Arvan** dirijin. |

Di dema niha û dema bê de, heke di hevokê de bireser hebe jî dîsa lêker li gor kirdeyê dihê kişandin. Çunke di van deman de lêker negerguhêz e. Lê di demên borî û çîrokîya hemî deman de lêker dibe gerguhêz û li gor bireserê dihê kişandin. Ev qayîde ji bo her du zaravayan jî wekî hev e.

Em tenê ji dema borîya dîyar nimûne bidin:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ehmedî **saye** werde. (m) | Ehmedî **sêv** xwar. |
| Şayla **ardî** rijnayî. (zh) | Şaylayê **arvan** rijandin. |
| Wendekaran **nan** werd. (n) | Xwendekaran **nan** xwar. |

### 18.3.PÊVEBER

Ji elementa ku hevokê digihîne netîceyekê re dibêjin **pêveber**. Hevok li gor pêveberê dibin du beş:

1)**Hevoka Lêkerê**
2)**Hevoka Navdêrê**

Hevoka ku di pêvebera wê de lêkereka kişandî hebe ew **hevoka lêkerê** ye. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Roşna kitab **wanena**. | Roşna kitêbê **dixwîne.** |
| Vewre pele-pele **varena.** | Befr pele-pele **dibare.** |

Îcar hevokên ku di pêvebera wê de navdêrek yan jî bêjeyek ku koka xwe ji navdêrê dihê hebe û bi rêya lêkereka nîvco bihê kişandin re jî dibêjin, **hevoka navdêrê**. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Dorê dewa ma **daristan** o. | Dora gundê me **daristan** e. |
| Roşna **kênaya xalê min** a. | Roşna **keça xalê min** e. |

## 18.4.AVANÎYA HEVOKÊ

Di kirdkî de jî eynî mîna kurmancî avanîya hevokê, em bibêjin awayê rêzbûna bêjeyan, yanî sentaks gelek muhîm e. Çunke car heye bi guherîna cihê daçekekê yan jî guherîna cihê lêkerê manaya hevokê diguhere. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Homa **bido** Ehmedî. | Xwedê **bide** Ehmedî. |
| Homa Ehmedî **bido.** | Xwedî Ehmedî **bide.** |
| Roşna mamosta **bî.** | Roşna mamosta **bû.** |
| Roşna **bî** mamosta. | Roşna **bû** mamosta. |

Dîsa nebûna daçekekê dişê manaya hevokê xelet bike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| Ez **bena** hêga. | Ez **dibim** zevî. |
| Ez **bena** [bi] hêga. | Ez **dibim** [bi/bo] zevî. |

Herwekî ku dixuye di hevoka pêşî de karê "bûyîn"ê heye, di he-

voka duyem de karê "birin"ê heye. Îcar dema ku daçeka (bi/bo) ku halê navdêrê çêdike nehê nivîsîn, mana çênabe.

**18.5.TELEFIZA HEVOKÊ**

Di kirdkî de çawa ku telafuza bêjeyê muhîm e, dema ku kîteyên bêjeyê rast nehên kirpandin bêje xelet fêm dibe, eynî wisa telafuza bêjeyên hevokê jî muhîm e. Di cumleyê de, kîjan element muhîm be, giranî diçe ser wê. Nimûne:

**Kirdkî**: "**Roşna** vizêr kitabê *Dersa Kurdkî* kitabroşê serê kuçeyê ma ra herîna." (Yanî kesêka bîne ney, **Roşna** kitab herîna.)

**Kurmancî**: **Roşnayê** duh kitêba *Dersa Kurdî* ji kitêbfiroşê serê kuçeya me kirî. (Yanî keseka din na, **Roşnayê** kitêb kirî.)

**Kirdkî**: "Roşna **vizêr** kitabê *Dersa Kurdkî* kitabroşê serê kuçeyê ma ra herîna." (Yanî yewna roje ney **vizêr** kitab herîna.)

**Kurmancî**: "Roşnayê **duh** kitêba *Dersa Kurdî* ji kitêbfiroşê serê kuçeya me kirî." (Yanî rojeka din na, **duh** kirî.)

**Kirdkî**: "Roşna vizêr **kitabê *Dersa Kurdkî*** kitabroşê serê kuçeyê ma ra herîna." (Yanî yewna kitab ney, **kitabê *Dersa Kurdkî*** herîna.)

**Kurmancî**: "Roşnayê duh **kitêba *Dersa Kurdî*** ji kitêbfiroşê serê kuçeya me kirî." (Yanî kitêbeka din na, **kitêba *Dersa Kurdî*** kirî.)

**Kirdkî**: "Roşna vizêr kitabê Dersa Kurdkî **kitabroşê serê kuçeyê ma** ra herîna." (Yanî Roşna cayêna ra ney **kitabroşê serê kuçeyê ma** ra herîna.)

**Kurmancî**: "Roşnayê duh kitêba Dersa Kurdî ji **kitêbfiroşê serê kuçeya me** kirî." (Yanî ji cihekê din na, ji **kitêbfiroşê serê kuçeya me** kirî.)

# HOMA Û PÊXAMBER

... Çîyî ser o bi, kes pê nêzano la hewna yew pêrodayîş mîyanê her di mehlan de vejîya. Yewbînan gonî û gonîşêr de xemilna. Sey her wextî, axir hetanî ke hal ra kewtî, xo bi xo abirîyay.

Vengdanê pêrodayîşê înan mintiqe de bi vila. Çiqas pîlî, giregirî û sermîyanê ê dorûveran estê amey kewtî mîyan ke înan werê bîyarê. Ge şîy keyeyê sermîyanê a mehla û ge zî amey keyeyê sermîyanê na mehla. Peynî de hetanî ke ê ardî rayîrî ser êdî muyî ziwanê înan wa amey. Welhasil bi çi kul û hal seba werêameyîşî îqna bîy. Mesele ame naye ser ke şorê keyeyê yewbînî, yew çay bişimê û mesele mîyan ra wedarîyo.

Maqul û began ro sermîyanêk teklîf kerd ke werzo înan reyde şiro keyeyê sermîyanê mehla bîne, pîya yew çaya ey bişimê, dima ra zî heme têreyde werzê bêrê keyeyê ey de yew çay bişimê û bi no qayde werêameyîş temam bibo, ê zî bi zerrîyêka weşe werzê şirê gureyê xo ser. Labelê camêrdî linge şana erd, "la" va "îllellah" nêva! Werêameyîş qebul kerd. La senî oyo ke welat de sey pêxamberêk hesibîyîno, verê bi xo werzo şo/şoro keyeyê sermîyanê Mehla Weverî. Çi rey winî beno!

Maqulan û began, heyran-qurban kerd la tu rayîr tede nêdî. Weriştî verê xo da bi keyeyê sermîyanê bînî. Bineyke nat û wet ra qisey kerd û ey ra va:

- Heyran, ma kerd û nêkerd camêrd nêame. Vano "Ez pêxamber a!" Ti werze ma şorê keyeyê ey, yew çaya ey bişimê, wa camêrdîya to bo; qet nêbo ma zî bizanê ke hende ezîyetê ma tewş de nêşîyo.

Camêrdî wina nermek û sakin kelawa xo biney da kîşte, seke çîyê bîyaro vîrê xo winî sereyê xo hekna, qirrika xo kerde pake û fetilîya mîyançîyan ser, va:

- Bi hende serrî ez nê welatî de Homayîye kena la nêno vîrê mi ke mi ê merdimî rê pêxamberîye şawita! Ez nêzana no kamcîn Homa yo, bê xebera mi werzeno ey rê pêxamberîye şaweno?! (*)

*Roşan Lezgîn, Ez Gule ra Hes Kena, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul 2007, r. 27-29

# XWEDÊ Û PÊXAMBER

... Li ser çi bû kes pê nizane lê dîsa pevçûnek di nav her du taxan de derket. Yekûdin di xwînê de xemilandin. Mîna her demê, axir heta kụ ji hal de ketin, xwe bi xwe ji hev veqetîyan.

Dengdana pevçûna wan li herêmê belav bû. Çiqas mezin, giregir û sermîyanên wan dorûberan hene hatin ketin navê ku wan li hev bînin. Geh çûn mala sermîyanê wê taxê û geh jî hatin mala sermîyanê vê taxê. Di dawîyê de heta ku wan anîn ser rê êdî mû bi zimanê wan ve hatin. Welhasil bi çi kul û halî ji bo lihevhatinê îqna bûn. Mesele hate ser viya ku herin mala yekûdin, çayekê vexwin û mesele ji navê bihê hilanîn.

Maqul û began li sermîyanek teklîf kirin ku rabe bi wan re here mala sermîyanê taxa din, bi hev re çayekê vexwin, dû re jî hemî bi hev re rabin werin mala wî, çayekê vexwin û bi vî awayî lihevhatin temam bibe, ew jî bi dilekî xweş rabin herin ser karê xwe. Lêbelê camêrî ling da erdê, "la" got "îllellah" negot! Lihevhatinê qebul kir. Lê çawa ewê ku li vî welatî wek pêxamperekî dihê hesabê, pêşî ew rabe here mala sermîyanê taxa wî alî. Tu car wisa nabe!

Maqul û began heyran-qurban kir lê tu rêyekê têde nedîtin. Rabûn berê xwe dan mala sermîyanê din. Piçek virde û wêde qise kirin û jê re gotin:

- Heyran, me kir û nekir camêr nehat. Dibêje "Ez pêxamber im!" Tu rabe em herin mala wî, çayeka wî vexwin, bila camêrîya te be; qet nebe em jî bizanin ku ewçend ezîyeta me di tewşê de neçûye.

Camêr wisa nerm û sakin kumê xwe piçek da alî, mîna ku tiştekî bîne bîra xwe, wisa serê xwe xurand, qirika xwe paqij kir û bi ser navbeynçîyan ve fetilî, got:

- Bû ewqas sal ez li vî welatî Xwedêtîyê dikim lê nayê bîra min ku min ji wî merivî re pêxamberîyê şandiye! Ez nizanim ev kîjan Xwedê ye, bêyî xebera min radibe jê re pêxamberîyê dişîne?!

# 19.GUHERÎNA DENGAN

Di zimanê nivîskî de forma peyvan çiqas standard be, yanî dengên guhertî yên peyvekê çiqas yek bin, bikarînana zimanî ewqas hêsan dibe. Çunke zimanê standard hem ji alîyê nivîsîn û bikarînanê ve hem ji alîyê fêmkirin û hînbûnê ve hêsan dibe. Lê di zimanê ku xwedîyê kultureka pihêt ya nivîskî nebin de, yanî di zimanên devkî de dengên bêjeyan zêdetir diguherin. Kirdkî jî wisa ye; gelek deng hene li her devokekê bi awayekî derdikevin û formên cihê yên peyvan zêdetir dikin.

Kurmancek dema ku kirdkî hîn dibe yan jî li ser kirdkî dixebite, heta bi dereceyekê ji vê guherîna dengan agahdar be, baş dibe. Lewre em dê çend dengên ku zêdetir xuya ne, li vir nîşan bidin.

**1) -an**

Li hinek devokan ev deng wek "**-ûn**", "**-on**", "**-û**" yan jî "**-o**" dihê gotin. Nimûne:

**banan** > **bûnûn**, **bûnû**, **bonon**, **bono**
**dewan** > **dewûn**, **dewû**, **dewon**, **dewo**
**mangan** > **mûngûn**, **mûngû**, **mongon**, **mongo**
**zanayan** > **zûnayûn**, **zûnayû**, **zanayon**, **zonayo**
**nan**> **nûn**, **non**, **no**
**camî** > **cûmî**, **comî**, **cumî**

Grûba Xebate ya Vateyî ku ji sala 1996an bi vir de li ser standardîzekirina kirdkî dixebite tesbît dike ku dengê "**-an**" rasttir e. Lewre di zimanê nivîskî de ev form dihê bikarînan.

Ev awa guherîn ne tenê aîdê kirdkî ye, di, kurmancî de jî heye.
Nimûne:

bavê min > bûvî min, bovî min
mala me > mûlî me, molî me

**2) -am**

Di kirdkî de dengê "**-am**"î diguhere. Nimûne:
kam > kûm, kom
lamba > lûmba, lomba
name > nûme, nome
tam > tûm, tom
zama > zûma, zoma

Eynî wekî dengê "-**an**", di vê formê de jî dengê "**-am**" rasttir e.

**3) Dengên J, C, Z**

Di kirdkî de ev deng jî gelekı bi hev diguherin. Grûba Xebate ya Vateyî ji van dengan dengê J tercîh dike. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| çije > çice, çize | çiçik |
| dej > dec, dez | êş |
| dewij > dewic, dewiz | gundî |
| dêrsimij > dêrsimic, dêrsimiz | dêrsimî |
| erjan > ercan, erzan | erzan |
| lajek > lacek, lazek | lawik |
| lojine > locine, lozine | kulek (pixêrî) |
| nimaj > nimac, nimaz | nimêj |
| projine > procine, prozine | bêjing |
| roj > roc, roz | roj |
| roje > roce, roze | rojî |
| vaje > vace, vaze | bêje |

### 5) Dengên "O" û "WE"

Di kirdkî de hinek peyv hene ku bi eslê xwe tirkî ne û bi "**o**" dest pêdikin lê di hinek devokan de wekî "**we**" yan "**wî**" dihên gotin. Nimûne:

ocax > wecax, wîcax
ocaxkor > wecaxkor, wîcaxkor
oda > weda
olacax > welecax, welcax
ordege > werdege
ortax > wertax
orte > werte

Grûba Xebate ya Vateyî pêşnîyaz dike ku ev deng di van peyvan de li gor eslê xwe bihê gotin. Çunke di kirdkî de li gelek devokan wekî eslê xwe dihê gotin.

Îcar di nav peyvên kirdkî de guherîna dengê "we" bi "o" jî gelek e. Nimûne:

| **Kirdkî** | **Kurmancî** |
|---|---|
| hewle > hole (m) | qencî |
| hewn > hon (n) | xwen |
| hewt > hot | heft |
| hewte > hote (n) | hefte |
| kewtiş > kotiş (n) | ketin |
| qewm > qom (n) | qewm |
| sewle > sole (m) | sol |
| sewt > sot (n) | sewt; deng |
| vewre > vore (m) | befr |
| zewte > zote (m) | nifir |

### 6) Dengên "B" û "V" "WE"

Di kirdkî dengê "b" di hin devokan de bi dengê "v" yan jî "w" diguhere. Nimûne:

xebere > xevere, xewere

xebate > xevate, xewate

robar > rovar

**4) Dengên "K" û "Ç"**

Di kirdkî de ev deng jî bi hev diguherin. Bêhtir jî dema ku li dû dengê **k**"yî dengên "**î**", "**e**" yan "**ê**" bihê, ev deng diguhere wekî "**ç**" dihê gotin. Nimûne:

**kefî, kefîye** > çefî, çefye

**keye** > çeye

**keyf** > çêf

**kêna** > çêna

**kêneke** > çêneke

**kêran** > çêran

**7) Dengên "G" û "C"**

Di hin devokan de dema ku li dû dengê "**g**" dengên "**î**", "**e**" yan "**ê**" bihên, ev deng dibe "**c**". Nimûne:

genc > cênc

gencîtî > cencênî

gêno/a/ê > cêno/a/ê

gî > cî

**7) Dengên "S" û "Ş"**

Di kirdkî de, bitaybetî di şîweya Dêrsimê de (îlahîm jî ev her sê madeyên dawîn) dengê "s" bi "ş" diguhere yan jî dengê "ş" bi "s" diguhere. Dema ku li dû van dengan dengên "**î**", "**e**" yan "**ê**" bihên ev guherîn çêdibe. Nimûne:

her kesî > her keşî

heşê birî > hesê birî

Husên > Wuşên

şeker > seker

şewe > sewe

şima > sima

# ÇAVKANÎ


Celadet Alî Bedirxan & Roger Lescot, Kürtçe Grameri (Kurmanci Lehçesi), l'Institut kurde de Paris, Jean Maisonneuve, Paris 1991

Celadet Alî Bedirxan, Elfabêya kurdî & Bingehên gramera kurdmancî, Nefel, Artsa Sweden 2002

Deniz Gunduz, Kırmancca/Zazaca Dil Dersleri, Weşanxaneyê Vateyî, İstanbul, 2006

Grûba Xebate ya Vateyî, Rastnuştişê Kirmanckî (Zazakî), Weşanxaneyê Vateyî, İstanbul 2005

Grûba Xebate ya Vateyî, Ferhengê Kirmanckî (Zazakî)-Tirkî/Kırmancca (Zazaca)-Türkçe Sözlük, Weşanxaneyê Vateyî, İstanbul 2009

Îbrahîm Seydo Aydogan, "*Di Kurmancî de Sîstema Deman*", www.kurdigeh.com/rwdx/sitepdf/ibrahimseydo-demenkurdi-ZEND.pdf

Kemal Badıllı, Türkçe İzahlı Kürtçe Gramer (Kürmançça Lehçesi), Med Yayıncılık, İstanbul 1993

Malmîsanij, Cemîlpaşazadeyên Diyarbekirî Û Neteweperweriya Kurdî, Weşanxaneyê Vateyî, İstanbul 2008

Malmîsanij, "*Kirmanckî (Kirdkî) di Suffiksî*", Vate, Kovara Kulturî, Hîmare 1, r. 81-93

Mistefa Aydogan, Rêbera Rastnivîsînê, Weşanên Rûpel, İstanbul 2012

Munzur Çem, Türkçe Açıklamalı Kirmancca (Zazaca) Gramer, Weşanên Deng, İstanbul 2003

Mûrad Ciwan, Türkçe Açıklamalı Kürtçe Dilbilgisi (Kurmanc Lehçesi), Jîna Nû Yayınları, Balinge / Sweden 1992

Newepel, Rojnameyo kulturî yo 15 roje, Hejmar 1- 53

Prof. Dr. Qedrî Yıldırım, Temel Alıştırma ve Metinlerle Kürtçe Dilbilgisi (Kurmancî Lehçesi), Mardin Artuklu Üniversitesi Türkiye'de Yaşayan Diller Enstitüsü Yayınları, Mêrdîn 2012

Samî Tan, Rêzimana Kurmancî, Weşanên Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, İstanbul 2005

Şewçila, Kovara Edebî Hunerî, Dîyarbekir, Hûmar 1-10

Şükrü Ünalan, Dil ve Kültür, Nobel Yayınları, Ankara 2010

Vate Çalışma Grubu, Türkçe – Kırmancca (Zazaca) Sözlük, Genişletilmiş üçüncü basım, Vate Yayınevi, İstanbul 2009

Vate, Kovara Kulturî, Hejmar 1-39

# FERHENGOKA LÊKERÊN XWERÛ

**Lêkerên xwerû**, ew lêker in ku di halê xwe yê xwerû de, yanî bêyî alîkarîya peyvek yan lêkereka din yan jî preverbekê çêdibin. Dibe ku hîn gelekên din hebin lê min şîya di kirdkî de ji hezarî zêdetir lêkerên xwerû tesbît bikim. Lêkerên ku li vir hene, dibe ku tevayî wan li hemî devokan nayên gotin.

Min ev lêker di sê beşan de kom kirin. Ewên ku min dizanîn, muadilê wan yên kurmancî nivîsîn lê ewên ku min nizanîn, kurmancîya wan vala hiştin.

Di lêkerên xwerû de tiştê muhîm ev e ku divê bihê zanîn, ger ji dawîya lêkerê paşqertafa raderê "**-ene** / -**yene**" bihê avêtin, bêyî kişandinê koka lêkerê ya **dema borîya dîyar** çêdibe. Nimûne:

| Kirdkî | Kurmancî |
|---|---|
| berd + **ene** = berdene | bir + **in** = birin |
| kewt+ **ene** = kewtene | ket + **in** = ketin |

Yanî dema ku em paşqertafa raderê (kirdkî: -**ene**, kurmancî: -**in**) ji koka lêkerê derxin, di her du zaravayan de jî bi vê koka lêkerê pêvebera dema borîya dîyar çêdibe. Dema ku hûn dê bala xwe bidin ser ferhengoka lêkeran, vê formulê di bîra xwe de bigirin.

**Lêkerên xwerû ku bi "d" diqedin**

**ardene**: anîn
**berdene**: birin
**kendene**: kolan
**kerdene**: kirin
**mendene**: man, mayîn
**merdene**: mirin
**mûndene**: hûnandin
**terdene**:
**wendene**: xwendin
**werdene**: xwarin

**Lêkerên xwerû ku bi "t" diqedin**

**antene**: kişandin
**bestene**: bestin
**cawitene**: cûn, cûtin
**dawitene**: seyandin
**deştene**: dirûtin
**ditene**: dotin
**elawitene**: stran, vestran
**esteritene**: ?
**eşkawitene**: pişkavtin
**eşnawitene**: bihîstin
**eştene**: avêtin
**girewtene**: girtin
**hûmaritene**: hejmartin
**karitene**: çandin (ji bo daran)
**kewtene**: ketin
**kiriştene**: guhêztin
**kiştene**: kuştin
**kotene**: kotin
**liştene**: alastin
**litene**: mijîn
**namitene**: tewandin
**nawitene**: nîşandan
**nimitene**: veşartin
**niştene**: veniştin
**nuştene**: nivîsîn
**pacitene**:
**pawitene**: parastin
**pewtene**: pehtin
**peymitene**: pîvandin
**pîştene**: pêçandin
**ramitene**: ajotin
**riştene**: rêsîn
**rotene**: firotin
**rutene**: maliştin
**sawitene**: têdayîn
**sentene**: wezinandin
**sotene**: sotin
**şawitene**: şandin
**şikitene**: şikandin
**şimitene**: vexwarin
**şutene**: şûştin
**taştene**: tiraş kirin
**tepîştene**: qefaltin
**tirawitene**: dizîn
**vatene**: gotin
**vawitene**: hûnandin
**vindertene**: sekinîn
**viraştene**: çêkirin
**viritene**: verişîn/verişandin
**vistene**: xistin
**vitene**: bêtin/wêtin
**vîyartene**: bihurîn
**waştene**: xwestin
**weriştene**: rabûn

